**Nûbihar**: 62

**SIYERA NEBÎ**
Ebu'l Hesen en-Nedwî

**Werger**
Mela Mûhemmed Bêrkevanî

**Edîtor**
Süleyman Çevik

**Serastkirin**
Mihemed Jiyan

**Berg**
İHB Reklam Ajansı

**Rûpelsazî**
Dawud Rêbiwar

**Çapxane**
Alioğlu Mat. Bas. Yay.
ve Kağ. San. Tic. Ltd. Şti
Orta Mh. Fatin Rüstü Sk. No: 1-3/A
Bayrampaşa/İSTANBUL
Tel: 212 612 95 59

Çapa Yekem: 2011

ISBN: 978-9944-360-75-3

Yayın Sertifika No: 16919

**Nûbihar**
Pak Ajans Yayıncılık Ltd. Şti.
Büyük Reşitpaşa Cad. Yümni İş Merkezi
No: 22/29 Vezneciler-İstanbul
Tel & Faks: (0 212) 519 00 09
e-mail: info@nubihar.com, nubihar@gmail.com

**Ebu'l Hesen en-Nedwî:** Di sala 1913an de, di malbateke bi rûmet de ku mala ilm û zanînê ye, ji dayik bûye. Bavê wî Ellame Şêx Ebdulheyy el-Hesenî ye, xwediyê kitêba bi navê; *Nuzhet ul-Xewatir* ya navdar e ku ew heşt cild e. Dayika wî jineke bêhnpak û alimeke mezin e. Gelek pirtûk û dîwanên wî yên şiîran hene, di serê sedsala heftemîn a hicrî de hîcretî Hindistanê kiriye. Şêx Ebul-Hesen (r.) li gundê Tekiye, nehyeya Rayî Berîlî ya nêzî Lekhenûyê hatiye dinyayê. Ew di diwanzdeh saliya xwe de li kêleka Ûrdî û Farisî dest bi hînbûna Ingilîzî û Erebî jî kiriye.

Şêx Ebu'l Hesen en-Nedwî di 31ê Çileya Pêşîn ya 1999an de wefat kiriye.

Li gor malûmatên ku heta niha hatine, nêzî sed û heştê kitêbên wî hene.

## NAVEROK

## PÊŞGOTINA WERGÊR

***Bi navê Xwedayê Rehman û Rehîm***

Hemd, sena, şukir û spasî ji Xwedê re bin. Ewê ku mirov kirine êl bi êl û millet bi millet da ku ew mafên hevûdu nas bikin û rêz û siyaneta hev bigrin. Ewê ku ji her milletî re pêxember û rêberek ji nav wan bi xwe şandiye da ku peyam û heram û helalên Xwedayê wan ji wan re bidin zanîn û wan li dinyayê û axretê bextiyar û dilşad bikin. Herwiha ji bo hizir, raman û mejiyên wan ji girikên pûtperestî û xurafeyan paqij û azad bikin.

Dirûd û silavên wî yên mubarek û bêjimar li ser wî zatê pakê azadker bin. Ewê ku ji hemû xelk û alemê re wek rehmet hatiye hinartin. Ewê ku di dilnermî, merhemet û qenciyê de rêzan û rêber e. Herwiha dirûd û silavên Xwedê li ser ehl, jin, sehabî, tabi'în û peyrewên wî jî bin. Ewên ku alaya heq, edalet, biratî û hîdayetê bilind kirine û ji bindest û jaran re bûne ronahî û çira. Piştî hemd û selewatan...

Me, ev kitêba şaheser û hêja ya seyda Ebûl-Hesen Elî en-Nedwî "Jînenîgariya Paşîvanê Pêxemberan ji bo zarokan" wergerand zimanê xwe yê şêrîn. Bi vî awayî me wezîfe û erkeke xwe ya dînî û millî bi cih anî. Dema min ew tercume dikir, ev malika Ehmedê Xaniyê gorbihişt: "Li me ferz e bizanin Resûlê xwe bi tehqîq, bi mewlid hem bi medfen binasin da û baban" dihat bîra min. Vêca ji bo zarokên me Resûlê Ekrem (s.) bi awayekî tam û ji serkaniyeke zelal nas bikin min ew tercume kir. Lewra ew kitêbeke pir girîng û giranbuha ye. Di mijara xwe de ew berhemek gelek nirx-bilind e û pirtûkeke zehf mûteber e.

Herwiha ew dumahîka pirtûka wî ya "Qisseyên Pêxemberan ji bo zarokan" e. Me ew jî wergerand zarê şêrîn ê Kurdî da ku xwendevanên Kurdî jê kelk wergirin. Ez hêvîdar im ku ev yek di roja padaş û sezayê de li deftera xêrên min were nivîsîn û zêdekirin û Xwedê mehder û şefaeta hebîbê xwe bike qismetê min û li bihişta xwe ya rengîn min bike cîranê wî zatê masûm.

Me hîç dest nedaye naverok û orîjînaliya pirtûkê û wekî ku heyî me ew tercume kiriye. Tenê me texrîc û deranîna hin ayetên wê kiriye ku di eslê wê de navê sûret û reqemên wan nenivîsandibûn. Herwiha me ew nivîsa ku li ser jiyan, berhem, nîşan û çalakiyên nivîskarî ye, ji nusxeyeke pirtûka wî ya bi navê "Qisseyên Pêxemberan Ji Bo Zarokan" peyde kir, wergerand Kurdî û di beriya pêşgotina nivîskarî de bi cih kiriye. Serkeftin ji Xwedê ye.

**Mela Mûhemmedê Bêrkevanî**

## BERÎ ÇAPKIRINA VÊ KITÊBÊ

Hemd ji Xwedê re be ku perwerdegarê cîhaniyan e. Dirûd û silav li ser xwendê şandeyan û pêşîvanê pêxemberan Mûhemmed û li ser malbat û hevalên wî tevan bin, hem jî li yên ku di qenciyê de bidin pey şop û rêça wan, heya roja xelat û celatê.

Ji paş hemd û selewatan. Bêguman ferhenga herî mezin ya bêjeyan û raveya herî bi tîn jî nikarin heqê hemd û spasiyê ji cenabê Xwedê re bînin cih. Herwiha ew nikarin dilşadiya ku di qelbê nivîskarê wan rêzenivîsan de ye; ya ku dema ew beşa dawîn ya rêza "Qisseyên Pêxemberan Ji Bo Zarokan" pêşkêş dike, îfade bikin. Ev beşa taybet e, tenê jînenîgeriya paşîvanê pêxemberan (s.) di naveroka xwe de digire. Xwedê temenê nivîskarê vê kitêbê dirêj kir, arîkariya xwe ya Xwedahî ji ser wî negirt, heya wî ev rêzenivîsa pîroz bi dawî kir û bi miskê dût. Eger nivîskar berî ku vê kitêba xwe temam bike, mirinê lezê lê bikira dê ew kul û derd pê re çûbana qebrê û dê di dilê Yaqûbî de pêdiviyeke nehatîcih bimana. Hin mijûlî û bûyerên hindik jî bes in ku nehêlin nivîskar vê kitêbê temam bike û rêzenivîsê bidawî bike. Di tarîxa pêkanîna berheman, nivîsandin û danasîna kitêbnivîsên mezin de pir nimûne hene ji rêzenivîsên ku bi dawî nebûne û kirinên qenciyê ku nîvtemam mane.

Bi rastî nivîskar bi xwe jî rûbirûyî xeterên weke vê hatiye, di nav nivîsandina beşa "Qisseyên Pêxemberan" ya ku gihayî hîkayeya xwendê me Mûsa (e.) û beşa ku ji qisseya xwendê me Şueyb (e.) dest pê kiriye û gihaye dawiya qisseya xwendê me Îsa (e.) tam sî salî navber ketiyê, nivîskar bi jiyanê tu baweriya xwe nebû û tu kes jî nikare pişta xwe bispêre zeman. Lêbelê

kerem û dana Xwedê gihîştê û hevkariya wî kir. Vêca ew jî rabû eynî li ser şop û rêça kitêba "Qisseyên Pêxemberan" ya ku bi dawî bûbû dest bi nivîsandina "Jînenîgariya Paşîvanê Pêxemberan Ji Bo Zarokan" kir. Di meha Şewalê ya 1395ê hicrî de, ji bo nivîsandina wê ket îtîkafê û da xwe heya di demeke pir hindik de ew qedand. Piştre dest bi nivîsandina kitêba mezin ya di bara jînenîgariya Pêxember (s.) de kir. Ev pirtûka piçûçik kakil û bingeha wê kitêba mezin e. Nivîskar, di meha Şewalê ya 1396an de ew jî bi dawî kir.

Min di pêkanîna vê kitêbê de bala xwe daye ser kurtkirina kitêba "Jînenîgariya Pêxember" ya Îbnî Hîşam -ewa ku di navbera kitêbên jînenîgariya Pêxember ên ku çap bûne û vêga mewcûd in de kitêba herî klasîk û kevin e ku tête belavkirin û di dilan de pir bitîn e- û ez di vê kitêbê de wek palpişt û jêder li hin lêvegerên kevin û pirtûkên rast û saxlem vegeriyame û min ew bingeh girtine. Nivîskar, îhtiyac nedîtiye ku rûpel û çapên van lêvegeran qeyd bike û berê xwendevanan bide wan. Lewra wî ji bo piçûkên têgehayî nivîsiye, ne ji bo lêkolîner û lêgerîneran, bi ness û rîwayetan bes kiriye. Min lêkolînên zanyarî, sebebên felsefî, îtîraf û govaniyên bêganeyan têkilî wê nekirine. Lewra ew xwendevanan mijûl dike; nahêle ji rûhê jînenîgariyê têr bibin û ji bedew û xweşikiya wê şîraniyê hilînin, hem jî behsa vê yekê, di kitêba mezin de bi berfirehî hatiye kirin, ewa ku ji têre-çandan re, ji ewên ku di zanîn û bîreweriya xwe de gihîştî û sitewiyane; ewên ku berê pirsên hemdemî û îtîqadî areste dikin û berheviyên zanyarî hûr dikolin re hatiye nivîsîn.

Min di vê kitêbê de mîna kitêba yekem a "Qisseyên Pêxemberan ji bo zarokan" xwe bi wan pêdiviyên ku di beşa yekem de ne, girênedaye. Min ew uslûbê piçûkan nexwerandiye, bi kar neaniye û ji bo li sirişta wan were, min kelîme ducare nekirine û min cumle û hevok dubare nekirine. Min gotinên rehet û hêsan nexebitandine û min hîkaye –bi pir raveyî venewejartine, venekiriye. Lewra êdî ev xwendevanên piçûçik jî bûne xort û di çanda xwe ya bêjeyên zimên de bi pêş ve çûne, eqlê wan sitewiyaye û bîrewer bûne, êdî gihane û dikarin ji vê xiza-

ya ilmî û eqlî îstîfade bikin û dişên ji vê qisseya bedew û rind; ewa ku jiyana mirovê herî mezin e û pêxemberê herî bi rûmet e (s.) tamekê wergirin.

Herwiha ev kitêb -bi arîkariya Xwedê- wek pirtûkek navîn ji wan kitêbên ku di bara jînenîgariya Pêxember (s.) de ji bo mezinên têrzanîn û piçûkên gihayî hatine nivîsîn, derket. Ev kitêbeke hêja ye ku piçûkên bîrewer û gihayî di mekteb û xwendegehên xwe de bixwînin û mezinên navîn jî di kitêbxane û malên xwe de bixwînin, ji kesên ne Misilman re jî pêşkêş bikin û veguhêzin zimanên biyanî jî. Di vê kitêbê de bi kurtî behsa jînenîgarî û kakila wî, xweşiktirîn qisse û xeberên wî, tarîxa destpêka doza Îslamê, fetih û serkeftinên wî û perwerdeya balkêş ya Pêxember û mûcîzeyên wî hatiye kirin. Ev kitêb xwendeheke bi serê xwe ye, şagirt û xwendevan ji wê dê bi bawerî û bêrîkirin derbiçe û di navbera rihek û reyhanan de bigere. Gava jê derkeve dê bi xwe re -wî qûtê xwe yê ku têra jiyana wî gişî bike, ronahiya ku dê li ber wê bilive, çeka ku dê bi wê berevaniya xwe û îmana xwe bike û peyama ku wê ji cîhan û milletan re bibe- hilgire.

Ji ber ku pirtûk ji xwendekarên lîseyê -û yên ku di sewiyeya wê de ne- re hatiye amadekirin û nivîsîn. Nivîskar pêdiviya şîrovekirina kelîmeyên hişk û zor û yên ku di ser sewiyeya wan xwendevanên piçûk re nedît. Ji Seyda Nûr alimê pêbawer yê Nedwî, ewê ku di "Nedweya Aliman" de di medresa Darul Ulûm de dersdar û seyda ye û sewiyeya çandî ya xwendevanên mîna wan şagirtan baş dizane- xwest ku wê şerh û rave bike. Vêca, ew jî rabû daxwaza nivîskarî anî cih, jê re sipas. Xwedê xêra wî jê re binivîse, bîne.

Piştre ne ku ya paşîn e. Ez ji Xwedê re hemd û sipas dikim ji bo vê arîkariya ku da min û ji bo wan nîmetên ku li min kirine. Dîsa ez şukrê wî dikim, ez ji cenabê wî rica dikim ku vî karê qenciyê qebûl bike, pê menfîetê bide nifşê nûhatî, ewê ku bager û bahozê dora wî girtiye û stirî û tûjkelem li rêya wî hatine raxistin. Bêguman Xwedê kê bivê, berê wî dide rêya rast.

15–Zîlqede,1397. Hicrî.

## Piştî pêxemberê Xwedê: Îsa kurê Meryemê

Dema qutbûna pêxemberiyê dirêj bû. Taristanî li cîhanê bû desthilat û serwer. Zanîn û ronahî winda bû. Ew dengên ku pêxemberan bi yekdêrîna pak û dînê sade û zelal di heyamên xwe de bilind û geş kiribûn di nava qirewîra nezanînê û rêşaşiyê de -ewa ku tehrîfkar û Deccalan- pê qîr didan nizim bû, çû ava, çirayên ku pêxemberên Xwedê û şûngirên wan pêxistibûn di nava bahoz û bagera ku peyapey bênavber barîn de vemirîn.

## Olên kevnare

Olên herî mezin -yê dawiya wan jî Filehtiya rehet- bûne rav û nêçîra armanc nediyaran û sextekaran û bûne pêlîza tehrîfker û zendîqan, heta ku rûh û awayê xwe winda kir. Vêca eger xwediyên wê yên pêşî û pêxemberên ku pê hatin şandin jî dîsa hatibana dê ew nasnekiribana.

Cihûtî jî bû çend terîqet, jêgire û merasimên bêrûh û bê jiyan, ji vê zêdetir jî ew ol ne millî û pêmayî bûn, ne mumkin bû ku ji cîhanê re peyamekê hilgirin. Ji xelk û alemê re dozekê û ji mirovatiyê re merhemetekê.

Herçî ku Filehtî bû, ew hê ji serê pêşîn ve; ji heyama xwe ya pêşîn ve rûbirûyî xerabkirina bêendaz û fanatîkan û tewîla nezanan hat. Ew giş bûne şikêr û di binê wan de prensîb û hînkirinên Îsa (e.) yên rehet û hêsan hatin veşartin. Nûr û ronahiya yekdêrîna Xwedê û bi sadeyî kirina îbadetê ji wî tenê re di pişt wan ewrên reş û tarî de hate veşartin û nehan bû.

Herçî ku Mecûsîtî bû, wan xwe li ser kirina îbadetê êgir kirine weqif; agir dihebandin, jê re peyker, heykel û hîmgeh lêdikirin. Lêbelê li derveyê mabedên xwe serbest bûn, li gorî hewesa wan dixwest û dilê wan dibijiya tevdigeriyan. Êdî di navbera Mecûsiyên agirperest û bê olan de ji hêla emel û exlaqî ve tu ferq nemabû.

Herçî ku Bûdîstî bû -ku ev ol li Hîndistan û Asyaya navîn belav bû- ew jî bûbû pûtperestiyeke hir. Bûdîst biçûna ku derê bi xwe re pûtên xwe jî dibirin. Heykel lêdikirin û koça xwe li ku danîbana li wirê heykelê "Bûda" diçikandin.

Herçî ku Berhîmîtî bû -Ola Hîndistanê ya eslî- bi piraniya mabûd û perestrawan xwedîîmtiyaz bû. Mabûdên wê ewqas pir bûn ku jimara wan gihîştibû milyaran. Di Berhîmîtiyê de ferq û cudahî di navbera çînî û sinifan de hebû û wê ferqeke zalimane dixiste nav mirovan.

Herçî ku Ereb bûn, ew di sedsala xwe ya dawî de bi pûtperestiyeke weza û bêkok ketibûn belayê. Pûtên wan ew qas pir bûn ku tenê nimûneya wê belkî li Hindîstana Berhîmî û pûtperest hebû û hew! Ereb di pûtperestiyê de bi pêşve çûbûn, ji xwe re -ji bil Xwedê- gelek mabûd girtibûn. Milletê Ereb, bi awayekî pir mekroh noqî pûtperestiyê bû; ji her êlê re, ji her taxê re, ji her bajarî re, belkî ji her malê re pûtekî taybet hebû. Li nava Kabeyê -ew mala ku Îbrahîm (e.) ew ji bo îbadeta Xwedê tenê avakiribû- û li hewşa wê sêsed û şêst pût hebûn.

### Girava Erebistanê

Exlaqê Ereban xera bûbû; bûn girêdayê araq û qumarê. Dilhişkî û milliyeta wan a bêqudoş ew ajotin ku hê bi saxî keçên xwe bixin bin axê. Êrîş li nava wan belav bûn, rêbirrîna kerwanan zêde bûn. Derece û sewiyeya jinê kêm bû; ew jî weke mal, pertal û sewalan ji wan re bi mîratxwerî dima. Hinan ji wan ji tirsa xizanî û feqîriyê zarokên xwe dikuştin, şer û ceng li wan hatibû barkirin, rijandina xwînê li cem wan pir besît û hêsan

bû her wek ku tiştekî normal û asayî be. Carina şerekî heya çil salî dewam dikir û tê de bi hezaran mirov dihatin kuştin.

## Tevdan li bejiyê û behrê xuya bû

Mirovatî, di dema şandina Pêxember (s.) de yekser di rêya xwekujî û întîharê de bû. Mirovan, di vê çaxê de xaliqê xwe ji bîra kiribûn; ji loma xwe û pêşeroja xwe jî ji bîra kiribûn, rêya xwe şaş kiribûn, ji rê ketibûn. Êdî nema qencî û neqencî ji hev vediqetandin. Carina di herêmeke fireh de yekî ku dînê wî jê re derd bana, îbadetê Xwedayê xwe kiribana û tiştekî nekira hevparê wî peyda nedibû. Xwedê çi qasî rast gotiye:

*"Tevdan li bejiyê û behrê bi sedem ya ku destên mirovan ew kirine xuya bû, da ku Xwedê hinekî ji ya ku wan kirine bi wan bide tamkirin. Belkî ew jê vegerin." (Rûm: 41)*

## Pêxember, çima ji girava Erebistanê hate şandin?

Xwedê, Ereb ji hilgirtina doza Îslamê re bijartin, da ku wê hîn bibin û piştre wê ji cîhanê û dorhêlên wê yên herî dûr re ragihînin. Lewra dilên wan sade û paqij bûn, li serê tu nivîsên kûr û hûr nehatibû nivîsîn heta ku jêbirina wê zehmet û zor bibûna mîna Rom, Pers û Hindê; ewên ku xwe bi zanîn û edebiyata xwe ya pêşveçûyî û şaristaniyên xwe yên ronak û geş qure dikirin.

Herçî ku Ereb bûn, li ser dilên wan hin nivîsandinên hindik û weza hatibûn nivîsîn, bi destên nezanîn û çolîtiyê lê hatibû kişandin. Ji loma jêbirin û xîçkirin û şûştina wê û danîna nexşine nû di şûna wê de hêsan û rehet bû. Ereb li ser fitret û xuliqîna pêşîn mabûn; gava têgihîştina heqiyê li wan zor hat, pê re şer kirin. Çi dema perde ji ber çavê wan rabû, hejê kirin û di rêya wê de xwe dane kuştin. Ereb xwediyê gotina xwe bûn. Bi jiyana nerm û xweş nedilebikin, gernas û fêris bûn. Hem jî Kabeya şerîf; ewa ku Îbrahîm û Îsmaîl (e.) ew ji bo îbadeta Xwedê û ya ku ji bo heta hetayê bibe jêder û serkaniya doza

yekdêrîna zelal û pak lêkirin, li Mekkê li girava Erebistanê bû. *"Bêguman mala yekem a ku ji bo mirovan hatiye lêkirin; ewa ku li Mekkeyê ye, ew pîroz e û ji cîhaniyan re rêber e." (Alî Îmran: 96)*

### Beriya Pêxembertiyê Mekke û Qureyşî

Dema Îbrahîm (e.) digel xanima xwe Hacer û kurê xwe Îsmaîl (e.) qesda Mekkeyê kir, ji ber pûtperestiya ku li cîhanê pir belav bû, reviya û hîcret kir. Da ku navend û mizgefteke ku tê de îbadeta Xwedê tenê were kirin ava bike. Xelkê gazî wê bike û ew bibe nîşangeh û mînareya hîdayetê û xaniyê xelkê. Hingî ew di newalekê de bû ku hawîrdora wê derê çiyayên hişk û rût bûn; li wê tiştê ku mirov pê bijîn jî av, çandinî û qût tunebûn. Xwedê ev kirina xêrê ji wan qebûl kir, bereket xiste vî welatî û av ji vê malbata bi şeref û piçûk -ya ku ji dayikê û kurê wê pêkhatî- re anî der. Lewra Îbrahîm (e.) ew li vî cihê hişk û tenha hiştibûn. Bîra Zemzemê der ket. Xwedê bereket xiste vê avê. Xelk her avê jê vedixwin, bi xwe re hildigirin û dibin çar aliyên dinyayê.

Îsmaîl (e.) mezin bû. Îbrahîm (e.) xwest kurê xwe Îsmaîlî hê bi zarokî serjê ke da ku hezkirina Xwedê di ser hezkirina kurê xwe re bigre û tişta ku di xewnê de dîtiye, bîne cih. Îsmaîl (e.) jî ev ji bo xwe emir qebûl kir, pê razî bû û Xwedê qurbaneke mezin bi gorî wî kir, da ku ew di doza Xwedê de arî bavê xwe bike û da qene ew bibe kalê pêxemberê dawîn û qasidê herî çê.

Îbrahîm (e.) vegeriya Mekkeyê û bav û kur bi hev re "Mala Xwedê" lêkirin. Her du li ber Xwedê digeriyan da ku wê malê ji wan qebûl bike, bereketê bixiyê, ew li ser Îslamê bijîn, li ser wê bimirin, ew bi mirina wan re qut nebe û ji kinêsa wan pêxemberekî bişîne ku ew doza bapîrê xwe Îbrahîm nû bike û ya ku wî dest pê kirî tekûz û temam bike. Dema Îbrahîm û Îsmaîl (e.) bingehên "Kabe'yê" bilind dikirin, wiha digotin:

*"Xwedayê me! Ji me qebûl bike, bêguman tu yî bihîstiyar û zana. Xwedayê me! Me bike Misilman ji bo xwe û kinêsa*

*me jî bike umeteke Misilman ji bo xwe. Îbadetê me nîşanî me bide, poşmaniya me bipejirîne, bi rastî tu yî tobepejrên û dilovîn. Xwedayê me! Pêxemberekî ji wan bişîne nava wan da ku ayetên te ji wan re bixwîne, wan hînî kitêb û hîkmetê/ zanînê bike û wan paqij bike, hemin tu yî destbilind û xwedî-hîkmet." (Beqere:126-129)*

Xweda bereket xiste zuriyyeta wan; malbat dorfireh bû, zarokên Ednan pir bûn ku ew jî neviyê Îsmaîl bû. Ji zuriyyeta wî Fexr kurê Malik derketibû. Ji zaroyên wî jî Qusey kurê Kîlab çêbû, ew bû karbidestê Kabeyê û Mekkeyê, bi ya wî dihat kirin, perdekirina Kabeyê di destê wî de bû, mifteyên wê li cem wî bûn, wî av û xwarin dida heciyan, ew bû serekê Encûmena Nedweyê; ewa ku ji bo şêwirê, rayê û girêdana alaya şer tê de kom dibin. Ji loma ew, li Mekkeyê gihabû zîrweya şeref û rûmetê.

Ji zarûyên wî Ebdulmenaf pir zîrek û şareza bû, kurê wî yê mezin Haşim jî bû mezinê gelê xwe, av û xwarina heciyan di destê wî de bû. Ew jî bavê kalikê Pêxember (s.) Ebdulmuttelib bû, piştî apê xwe Muttelib kurê Ebdulmenaf, wî av û xwarina heciyan da, ew di nav milletê xwe de giha şerefeke wisan ku ji bav û bapîrên wî yek jî negihabûyê û xelkê wî, pir jê hez dikir.

Zarûyên Fexr kurê Malik bi "Qureyş" hatin binavkirin. Ev nav ji hemû navên din meşhûrtir bû. Ji loma ev êl bi navê Qureyş navdar bû. Ereb giş bi ber bilindî û zadeganiya zuriyyeta Qureyşî, meznatî, ziman-zelalî, peyvên sadeyî, exlaqçakî û mêrxasî û egîdiya wan hatine. Ev dabaşeke wisa ye ku tu kes tê de nîqaş û miqirsiyê nake.,

### Xuyabûna pûtperestiyê li nava Mekkeyê û Qureyşiyan

Qureyşî, li ser dînê Îbrahîm Xelîl (e.) û dînê kalê xwe Îsmaîl (e.) man. Li ser eqîdeya tewhîdê; baweriya yekdêrînê û îbadeta Xwedê tenê man. Paşîkê ji nava wan zilamek bi navê 'Emr

kurê Luhey rabû. Ew bû mirovê yekem yê ku ola Îsmaîl (e.) guherandiye, wî pût çikandin erdê, wî ji heywanan re mezintî, qurban û heramkirinek wisan deranî holê ku Xwedê destûra wê nedabû û şerî'eta Îbrahîm (e.) jî ew nas nekiribû. Hîkayeya pûtperestiyê wiha dest pê kir: Ew derket rêwîtiyê, çû Şamê, dît ku xelkê wê derê benîtiya pûtan dike. Vêca ew jî bi wan ji rê ket û hin pût bi xwe re anîn Mekkeyê, ew di erdê de çikandin û berê xelkê da perestin û mezindêrîna wan. Hin ji wan hino hino pêde çûn, kevirê herêmê mezindêran û gava ji Mekkeyê diçûn cihekî din wek mezindêrîna herêmê û di bîranîna navê wê de ew kevir bi xwe re dibirin. Paşîkê gihan dereceyek welê ku kîjan kevir li xweşa wan çûba û bala wan kişandiba perestina wî dikirin.

### Bûyera Fîl

Hadîseyeke mezin qewimî, ew nişana hadîseyeke hê ji wê mezintir bû, ew bû elametê ku Xwedê xêra Ereban dixwaze û bû nîşana ku ji Kabeyê re nîşanek/rewşek heye ku ji bilî wê ji tu mal û xaniyên cîhanê re tuneye. Bûyerê wiha rûda: Hate bihîstin ku waliyê Yemenê Ebreheyê Eşrem ê ku ji aliyê keyê Hebeşistanê Necaşî ve hatibû tayînkirin, li Sen'aya Yemenê bi navê “Elqullyus” dêreke mezin lêkir. Ebrehe, xwest wê bike Heca Ereban; berê wan vegerîne bal wê ve û êrîş bire ser Kabeyê. Lewra ew stargeh û mala xelkê bû, karwan dihatinê û ji her rêyên kûr û dûr qesda wê dikirin. Ebrehe xwest ev cih û şeref bibe yê dêra wî.

Ev rewş li zora Ereban çû. Lewra Ereb bi şîrê hezkirina Kabeyê û mezidêrîna wê hatibûn xwedîkirin, ew bi xaniyekî din nedidan û tu şûngirê wê qebûl nedikirin. Bi vê hadîseyê mijûl bûn. Vêca yekî Kenanî ji mala xwe derket, çû wê dêrê û tê de rît. Loma Ebrehe enirî û sond xwar ku ew mêr dê biçe Kabeyê hilweşîne.

Piştre Ebrehe digel fîlan ji mala xwe derket û qesda Kabeyê kir. Ereban ev bihîst, weke ku birûsk li wan li bikeve, ew mezin

dîtin, jê tirsiyan, xwestin wî ji qesda wî vegerînin û şerê wî bikin. Vêca dîtin ku ew dê xwe li ber Ebrehe û leşkerên wî negirin. Berevaniya Kabeyê sipartin Xwedê. Lewra wan baş dizanîn ku xwediyekî Kabeyê heye. Ew dê wê biparêze. Hevpeyvîna ku di navbera Ebrehe û mezinê Qureyşiyan -kalê Pêxember- Ebdumuttelib de derbas bûye vê yekê nîşan dide. Ebrehe, du sed deveyên Ebdulmuttelib girtibûn. Ji Ebrehe destûr xwestin da ku Ebdulmuttelib were cemê. Wî destûr dayê ku were, gava hat Ebrehe xatirê wî girt, ji kursiyê xwe daket erdê. Wî li nik xwe da rûnandin û jê daxwaza wî pirsî? Ebdulmuttelib gotê: Daxwaza min ev e ku Key Ebrehe du sed devehên min yên ku girtine berde û li min vegerîne.

Çi dema Ebdulmutuelib ev yeka ha got. Ebrehe ew piçûk dît û li rewşa wî şaş ma!

– Tu bi min re di bara du sed devehî de dipeyivî ku min ew ji terşê te girtine. Lêbelê tu dev ji xaniyekî wilo berdidî ku ew dînê te û dînê bav û bapîrê te ye. Halev e ku ez hatime wê wêran bikim û tu di bara wê de bi min re napeyivî?

– Ez xwediyê deveyan im, Xwediyê Kabeyê jî heye. Ew dê nehêle tu dest bidiyê.

– Ew nikare nehêle.

– Tu û ew ji hev re serbest in.

Qureyşî, ji tirsa ku ew dê li ber lingê leşkerên Ebrehe herin xwe dane serê çiya û newalan û çavnêrî dikirin, ka Xweda dê çi bîne serê kesê ku êrîşî herema wî bike? Ebdulmuttelib û çend kesên Qureyşî rabûn deriyê Kabeyê girtin, dua dikirin û li hemberî Ebrehe û leşkerên wî arîkarî ji Xwedê dixwestin. Ebrehe, xwe amade kir ji bo biçe Mekkeyê û gihan hev da ku Kabeyê hilweşînin, wêran bikin û fîlê xwe amade kir. Navê fîlê wî (Mehmûda) bû. Lêbelê fîl di rêya Mekkeyê de mexelî. Li wî dan ji bo rabe, lê ew berizî û ranebû; gava berê wî vegerandin rexê Yemenê bi çargavkî rabû ser xwe. Li wirê Xwedê ji deryayê teyrek (teyrê ebabîl) şand ser wan; bi her teyr û tûrî

re çend kevir hebûn wan bi xwe re hildigirt û ew li kê diketin derhal ew dikuştin. Hebeşistanî bi révarev berê xwe dane rêya ku tê re hatibûn. Ew ji Mekkeyê derketin, cendekê wan li ser her rêyê diketin erdê. Ew kevir li Ebreheyî jî ketin, wî bi xwe re deranîn birin, movikên wî yek bi yek ji hev diketin, heta ku birin Sen'ayê ew li wirê bi îbret mir. Qur'ana Kerîm vê qewimînê wiha radigihîne: *"Ma te nedît Xwedayê te çi anî serê xwediyê fîl? Qey wî plana wan pûç nekir? Ref bi ref teyr şandin ser wan, bi kevirên hişk û dijwar diavêtin wan; vêca ew kirine weke pûşê ku hatî xwarin." (Fîl: 1-5)*

Çi dema Xwedê, ji Mekkeyê berda Hebeşistaniyan û tişta ku anî serê wan. Êdî Ereban bi çavekî mezinbîn li Qureyşiyan meyizand û got: Ew xelkê Xwedayî ye; Xwedê di şûna wî de şer kir û nehişt dijmin zerara wî bike.

Ereban ev rûdan zehf mezin dîtin û heqê wan hebû ku wê mezin bibînin jî. Ji loma ew ji xwe re kirin tarîx û digotin: Ev, di sala fîl de qewimiye. Filan kes di sala fîl de ji dayika xwe bûye. Ev piştî sala fîl bi çend salan hatiye holê. Sala fîl, sala 570ê mîladê bû.

## Ebdullah û Amîne

Ebdulmutelib -mezinê Qureyşiyan- deh kurê xwe hebûn. Ebdullah bûbû navgînê peymanê. Bavê wî, ew bi Amîneyê, keça wehebî -mezinê êla Zuhre- re zewicand. Amîne, ew roj ji nava Qureyşiyan wek bavik û şûnwar jina herî baş bû. Hê demeke gelek dirêj li ser zewaca wan re nebihurî Ebdullah çû dilovaniya Xwedê û dayika Pêxember pê li halekî bû. Wê gelek eser û nîşan ji hemlê xwe dîtin. Wan eseran nîşan dida ku ji kurê wê re meqamekî mezin heye.

## Wîladeta wî ya mubarek û neseba wî ya paqij

Resûlê Ekrem (s.) roja duşemê diwazdehê meha Rebî'ulewelê, sala bûyera fîl (570ê mîladî) ji dayika xwe bûye. Ew roj,

ji hemû rojên ku rojê li ser wan hilatiye bi berekettir bû. Navê wî; Mûhemmed e. Navê bavê wî Ebdullah e. Ebdullah kurê Ebdulmuttelib e. Ebdulmuttelib kurê Haşim e. Haşim kurê Ebdulmenaf e. Ebdulmenaf kurê Qusey e. Qusey kurê Kîlab e. Kîlab kurê Murre ye. Murre kurê Ka'b e. Ka'b kurê Luey ye. Luey kurê Xalib e. Xalib kurê Fexr e. Fexr kurê Malik e. Malik kurê Nedir e. Nedir kurê Kînan e. Kînan kurê Xuzeyme ye. Xuzeyme kurê Mudrîke ye. Mudrîke kurê Îlyas e. Îlyas kurê Muder e. Muder kurê Me'd e. Me'd kurê Ednan e. Neseba Ednan digihê mezinê me Îsmaîlê kurê Îbrahîm (e.)

Çi dema dayika Pêxember (s.) hemlê xwe danî. Ji bapîrê wî Ebdulmuttelib re şand ku; ji te re lawikek bûye. Vêca ew jî hat, lê nêrî û rahiştê; ew bir Kabeyê û rabû dua ji Xwedê kir, jê re hemd û spasî kir û navê wî Mûhemmed danî. Ew navekî xerîb û ne meşhûr bû. Ereb jê bi sosret man.

## Şîrmêhtina wî

Ebdulmuttelib, ji neviyê xwe yê sêwî re -ewê ku ji zaroyên xwe hemûyan bêhtir jê hez dikir- çavên xwe li dayînekê ya ji çolê digerand. Weke ev yek li cem Ereban adet bû. Ev xweşbextî bû qismetê Helîmeya Se'diye. Ew jî, ji mala xwe derketibû, ji xwe re li zarokekî digeriya ku wî bi heq şîr bide. Lewra ew sal, saleke bi tengî, tunetî û xela bû. Ew jî di nava tengî û tunetiyê de bûn. Pêxember (s.) ji hemû dayînan re rapêş kirin lê wan xwe nedan berê. Lewra; wan hêviya menfî'etê ji bavê lavikî dikirin û digotin: Ew sêwî ye, qey dayîk û kalê wî.dê çi ji me re bikin. Herwiha Helîmeyê jî serê pêşî wisa kir û pêça xwe nedayê. Dûv re dilê wê pê şewitî, Xweda hezkirina wî sirûşî dilê wê kir û ew bi şîrmijî ji xwe re girt û wê ji bilî wî tu zarokekî din peyda nekir. Ji loma lê vegeriya û ew girt bire cem karwanê xwe. Wê bi destê xwe bereket wergirt; di her tiştê karwanê wê de rewşeke ji bilî ya berê hebû. Helîmeyê xêr û bereket di sînga xwe

de, di şîrê dondilên xwe û di makera xwe de jî dît. Tevan jê re digotin: Hey Helîme! Mizgîn li te, te zarokekî bimbarek girt. Hevalê wê jê çavnebarî kirin. Wê her ji Xwedê xêr, bereket û destfirehî dît.

Hê du sal bi ser wê û şîrmijê wê re derbas bûn, ew mezin dibû û nedişibihiya tu zarokan. Piştî du salên wî temam bûn, Helîmeyê ew ji dayika wî re bir, dayika wî jê xwest ku wî li cemê hinekî dî jî bihêle, wê jî qebûl kir û dîsa bi xwe re vegerand malê. Gava ew li cem mala Se'diye bû du firîşte hatin cem wî: Zikê wî qelaştin û ji dilê wî perçeyek xwîna reş derxistin avêtin, dûv re dilê wî şûştin, heta ku paqij bû û eynî wekî berê rehet kirin.

Pêxemberê Xwedê (s.) digel birayê xwe yê şîr çû ber pez û şivantî kir; li ser fitretê, jiyana paqij a çolê û zimanê zelal û xwerû rabû; ewê ku di nava êla Se'diye de navdar û meşhûr bû. Pêxember (s.) diltenik û dilovan bû, birayên wî jê hez dikirin û wî jî ji wan hez dikir. Piştre li dayik û bapîrê xwe vegeriya û Xwedê ew weke şitlekê mezin û hêşîn kiribû.

### Wefata Amîneyê û Ebdulmuttelib

Çi dema pêxember giha şeş saliya xwe dayika wî Amîneyê li "el-Ebwa"yê wefat kir ku ev der dikeve neqeba Mekke û Medîneyê. Vêca Pêxember (s.) li cem bapîrê xwe ma. Kalê wî, ew hemêz dikir; ewî li ser cilika xwe ya ku li ber siha Kabeyê bû dirûnand û pê şa dibû. Çi dema Resûlullah (s.) temenê wî giha heşt saliya xwe, Ebdulmuttelib jî wefat kir.

### Bi apê xwe Ebûtalib re

Pêxember (s.) piştî ku kalê wî Ebdulmuttelib wefat kir, çû cem apê xwe yê heqîqî Ebûtalib. Ebûtalib birayê Ebdullah yê ji dê-bavê bû. Ebdulmuttelib wesiyeta (qewîtiya) Pêxember (s.) lê kiribû. Ebûtalib ew anî cem xwe û ji hemû zarokên xwe bêtir jê hez dikir.

## Perwerdeya Xwedayî

Pêxember (s.) mezin dibû û ji aliyê Xwedê ve dihate parastin. Ji qirêjî û adetên taristaniyê dûr dihate perwerdekirin. Ew ji aliyê kesayetî ve ji gelê xwe gişî çêtir bû, ji aliyê exlaqî ve ji wan tevan xweştir bû, ji aliyê tore û heyayê ve ji wan tevan bêhtir fehêtokî bû, ji aliyê gotinê ve ji wan hemûyan rasttir bû, ji ewledêrayî û duristî ve ji wan tevan mezintir û emîntir bû, ji wan tevan zêdetir ji gotinên bêtoreyî û zarê nexweş dûr bû. Li nava gelê wî navê wî: "Emîn" bi tenê bû. Ji xwedî û xizmên xwe re bi dewlet bû; karê wan pêk tanî û bi kêrî wan dihat, barên giran yên xelkê hildigirt, qedr/merîfeta mêvanan digirt, arîkariya qencî û xêrê dikir, ji keda destê xwe dixwar û bi rizqê xwe qayil bû.

Çi dema Pêxember (s.) bû çardeh-panzdeh salî. "Şerê Fuccar" di navbera Qureyşî û Qeysiyan de dest pê kir. Pêxember (s.) jî, rojina beşdarî vî şerî bû; ji apên xwe re tîr vedigerandin. Bi tevlîbûna cengê şer nas kir; xortanî û fêrisî nas kir.

## Zewaca wî bi Xedîceyê re

Çi dema temenê Pêxemberî (s.) bû bîst û pênc sal, bi Xedîce xanima keça Xuweylid re zewicî. Ew pîrekek ji stiyên Qureyşiyan û çêtirînê jinan bû, eqil-sitewiyayî, exlaqxweş û zengîn bû, jinebî bû, mêrê wê Ebû Hale çûbû dilovaniya Xwedê. Dema Pêxember (s.) pê re zewicî, temenê wî bîst û pênc û yê wê jî çil bû.

Xedîce xatûn, jineke bazirgan û tucar bû. Li cem xwe, mêr bi heqdestî didan xebatê û bi usûla prîman mal dida wan. Milletê wê Qureyşî, qewmekî bazirgan bû. Dema Pêxember (s.) bi malê wê yê tîcaretê re çûbû Şamê, wê ji wî rastbêjî, exlaqxweşî û şîretkarî dîtibû. Wê, di vê seferê de ji wî cihê wî yê mezin û gelek xêr dît. Ji loma xwe ji wî re rapêş kir û jê re pêşniyaz kir ku pê re bizewice. Wê, pêşniyaza zewacê ya gelek giregirê Qureyşiyan vegerandibû. Apê wî Hamze ew jê

re xwest, apê wî Ebûtalib jî duayê zewacê xwend û peymana zewacê dan. Xadîce xanim, pîreka yekem e ku Pêxember (s.) pê re zewaciye û ji bil Îbrahîm zarokê wî giş ji wê bûne.

### Qisseya avakirina Kabeyê û berterefkirina tevdaneke mezin

Temenê Pêxember (s.) dema giha sala sih û pêncan, Qureyşî, ji bo avakirina Kabeyê gihane hev. Ji bo wê bi ban bikin ev xwestin. Lewra dîwarê wê bi hişkeberê hatibû lêkirin û di neqeba keviran de heriyek tunebû ku pê xwe li ser hev bigrin. Sitûnê Kabeyê bi qandî qama miroveki bilind bû, loma diviyabû bihatana herifandin û ji nû ve bihatana avakirin.

Çi dema avayî giha ruknê wê. Qureyşiyan di bara "Berê Reş" de keşmekêşî kir; her êlê dixwest ew bi xwe Berê Reş deyne cihê wî, ne xeyrê wê. Lewra her qebîleyê dixwest ev şeref ya wê bi tenê be. Paşîkê gengeşe giha sewiyeya ku şer dest pê bike. Lewra di heyama cahiliyyetê de şer ji ber sedemne pir biçûk jî dest pê dikir.

Hemûyan xwe ji ceng û lêdanê re kar kir. Mala Ebduddar kasikeka mezin û tijî xwîn pêşkêş kirin; wan û Mala Eddî li ser mirinê peyman dane hev û destê xwe di wê xwîna kaseyê de noq kirin. Ew nîşana pevçûn û mirinê bû. Qureyşî, heyanî çend rojan wisa li ber hev man. Piştre îttîfaq kirin ku pêşî yê bikeve deriyê mizgeftê ew dê di navbera me de hekemtiyê bike. Vêca yê ku pêşî ji deryê mizgeftê hat, Resûlê Xwedê (s.) bû. Çi dema wan, ew dît wiha gotin: Ev pêbawer e, ev Mûhemmed e, me hukmê wî qebûl e. Pêxember (s.) cilek anî, li erdê danî, bi destê xwe Berê reş danî serê, dûvre got: Bila her êl bi keviyekê bigre; piştre tev wî hildin. Wan jî bi ya wî kirin. Paşîkê gava kevir gihandin cihê wî. Pêxember (s.) ew danî şûna wî û dûv re li serê ava kir. Pêxember (s.) bi vê hîkmeta ku di ser wê re hostayî tuneye şer ji nava Qureyşiyan hilanî.

**Peymana bêhnpakan**

Pêxember (s.) beşdarî peymana pêhnpakan bû. Ew peymana herî baş bû ku wî bihîstibû û ya herî bi rûmet bû li nava Ereban. Sedemê pêkanîna wê jî ev bû ku; zilamekî ji êla Zebîd pertalên xwe anî Mekkeyê ji bo firotinê. As kurê Waîl jî ku ji giregirê Qureyşiyan bû pertalê wî kirrîn û heqê wî nedayê. Vêca wî jî, ji giregirê Qureyşiyan arîkarî xwest. Lê arî wî nekirin. Lewra 'As kurê Waîl xwedî-meqam bû, yê Zebîdî qewitandin. Ji loma wî arîkarî ji Mekkeyiyan û ji hemû mirovên xwedî-rûmet û şeref xwest.

Hin zilamên merdemêr û bi namûs hatin xîretê; li mala Ebdullah kurê Cudan gihane hev. Wî jî xwarinek ji wan re çêkir, peyman û ehd dan ku ew dê bibin yekdest; dê digel mezlûm li hemberî zalim bin heyanî ku heqê wî bistînin û bidinê. Ereban navê vê peymanê kirin: "Peymana Bêhnpakan." Wiha gotin: Van mirovan dest bi karekî baş kirine. Dûv re meşîn çûne cem 'As kurê Wailî heqê yê Zebîdî jê wergirtin û danê.

Pêxember (s.) heta piştî ku hatibû şandin jî bi heyranî behsa vê peymanê kir û xwe bi prensîbên wê digirt û wiha digot: Ez li mala Ebdullah kurê Cudan beşdarî peymanekê bûm ku eger di heyama Îslamiyetê de jî ez ji bo wê bême gazîkirin ezê dîsa bersiv bidimê. Beşdaran peyman dane hev ku heqan li xwediyê wan vegerînin û ku nehêlin ku zalim zora mezlûm bibe. Ji hîkmeta Xwedê û perwerdeya wî bû ku Pêxember (s.) ummî be; nexwîne û nenivîse, da ku ji tohmetên neyaran û zenên xerîb-dîtan dûr be. Qur'ana Kerîm îşaretî vê hîkmetê dike, dibêje: *"Te beriya wê ne kitêb dixwend û ne jî bi destê xwe dinivîsî. (Heke te ev bikira) wê çaxê pûçîgêr dê biketana gumanê" (Enkebût:18)*

Bêguman Qur'ana Mecîd leqeba "Ummî" li Pêxember (s.) kiriye:

*"(Ehlê merhemetê) Ew in ku didin pey qasidê ummî ewê ku wî li cem xwe di Tewrat û Încîlê de nivîsayî dîtine." (E'raf:157)*

## Piştî şandinê mizgînên sipêdeyê, tîrêjên bextewariyê

Qasidê Xwedê (s.) temenê wî çil sal temam bû. Mizgîn û pêşhatên şefeqê, nîşan û tîrêjên bextiyariyê xuya bûn û civan û dema şandinê nêz bû. Ev qanûneke Xwedê ye ku dema tarîtî tam reş û dijwar dibe û bextreşî demdirêj dibe, tîrêjên fecrê û zeraqên tavê dihilên û têne der.

Hedana Pêxember (s.) nedihat, bê semaxiya wî ji rewşa wî dixuya ku gihabû zîrweya xwe. Her wekî yek wî bikişîne; pir dixwest bi tenê bimîne. Li ber dilê wî tiştek mîna tenêmayînê ne şîrîn bû. Ji Mekkeyê derdiket, xwe dûr dikir, heta ku xanî ji ber winda dibûn. Xwe dida newala Mekkeyê. Vêca di ber kîjan kevir û darê de derbas bûbe. Wan jê re digotin: Hey qasidê Xwedê, silav li te be! Resûlullah jî, li hawirdora xwe; li rastê xwe, li çepê xwe, li pişta xwe dizîvirî tenê kevir û dar didîtin. Rewşa wî serê pêşî bi xewnên rast ên ku di xewê de didît dest pê kir. Her xewna ku didît jê re weke ku şewqa sibehê be dihat.

## Li şikefta Hîrayê

Pêxember (s.) pirê caran li şikefta Hîrayê çend şevên peyapey dima. Nanê xwe bi xwe re dibir. Îbadet dikir û li gorî rêya pak a Îbrahîm (e.) û afirandina bêqusûr û ronak dua ji Xwedayê xwe dikir.

## Şandiniya wî

Rewşa wî wisan dewam kir. Heta ku roja civanê şandina wî di carekê de hat. Ew, di hivdehê meha Remezana çil û yekê zayîna wî de ku hemberê şeşê Tebaxa şeşsed û dehê mîladî ye, li şikefta Hîrayé bû. Ferîşte (Cîbraîl) hate balê. Jê re got:

– Bixwîne!

– Ez nexwenda me. Resûlullah (s.) dibêje: Wî (Cîbrîlî) ez girtim û guvaştim heta ku ez êşandim. Ez berdam û dîsa ji min re got:

– Bixwîne!

– Ez nexwenda me. Dîsa ez girtim û guvaştim heta ku ez êşandim. Dîsa ez berdam û gote min:

– Bixwîne!

– Ez nexwenda me. Cara sisêyan jî ez girtim, guvaştim, pey re ez berdam û got: *"Bi navê Xwedayê xwe yê ku afirandiye, însan ji parçeyekî xwînê afirandiye, bixwîne. Bi navê Xwedayê xwe yê qedirgir; ewê ku bi qelemê daye hînkirin. Însan hînî ya ku nizaniye kiriye, bixwîne" (Eleq:1-5)* Ev roja yekemîn a pêxembertiyê û destpêka peyxama Qur'anê bû.

**Li mala Xedîceyê**

Qasidê Xwedê (s.) ji wî melekî saw girt. Lewra berê tiştekî welê ne dîtibû ne jî bihîstibû. Dema qutbûna pêxemberiyê dirêj bûbû. Ereb, ji mêj ve ji pêxemberiyê û pêxemberan -Silavên Xwedê li wan bin-dûr mabûn. Ew ji xwe bitirs bû, vegeriya malê û goştê navbera kêlek û milê wî dilerizî û got: Cila li min werdin, cila bi min de bikin, ez ditirsim ku tiştin li min biqewimin! Xedîce xanimê, sedemê vê metirsiya wî jê pirs kir. Vêca wî jî jê re mesele got. Ew jineke eqilmend û bêhnpak bû. Hisa pêxembertî, pêxemberan û milyakatan kir. Ew diçû serdana kurmamê xwe Wereqe kurê Newfel ku ew miroveki filezan bû, kitêb xwendibûn, guhdariya zanayên Tewrat û Încîlê kiribû. Xedîce xanimê jî, mîna hemû kesên ku li ser afirandina rast û mejiyên paqij ji xelkê Mekkeyê (bê-olî û pûtperestî) qebûl nedikir. Wê ji her kesî bêhtir exlaqê Pêxember (s.) dizanî. Ji ber ku ew nêza wî û hevala wî bû, wê raz û dîtbariya wî dizaniya. Wê ji exlaq û bêhna pêxemberî dizaniya ku ew zilamekî wisa ye ku pişta wî ji aliyê Xwedê ve tê girtin. Ew ji nava xelkê xwe hatiye bijartin û jînenîgariya xwe pak bû. Ji ber vê yekê wê zanîbû yê ku jînenîgarî û exlaqê wî bi vî awayî be, ji Şeytên natirse ku ew tiştekî pê bike, yan jî cin dest bidinê; pê ve bidin, vê bi tişta ku wê ji hîkmet, dilovînî û qanûna Xwedê ya li nava

mexlûqên wî naskirî re nakokî dikir. Ji loma wê bi bawerî û bi kirp gotê: "Na! Xweda, yê ji binî te riswa neke. Lewra; tu bi kêrî xizmên xwe tê, tu giraniyê hildigirî, tu arî muhtacan dikî, tu mêvanan xwedî dikî û tu hevkariya heqdar dikî."

## Li cem Wereqe kurê Newfel

Xedîce xatûnê munasib dît ku di vê yekê de arîkariyê ji kurmamê xwe yê Zana Wereqe kurê Newfel bixwaze. Pêxember (s.) bir cem wî.

Resûlullah (s.) tiştê ku dîtibû jê re ragihand. Vêca Wereqe, jê re wiha got:

– Ez bi wî kim ku bêhna min bi wî ye tu pêxemberê vê umetê yî! Namûsê Mezin hatiye cem te. Ewê ku hatibû nik Mûsa jî. Dê Gelê te biderewînin. Dê te biêşînin û te ji cih û warê te derînin û şerê te bikin.

Pêxember (s.) şaş ma! Gava Wereqe gotê: Ewê te derînin. Lewra wî cihê xwe li nava Qureyşiyan dizanîbû. Wan bi kelîmeya sadiq (rastgo) û Emîn (pêbawer) gazî wî dikirin û pê re dipeyivin; navê wî hilnedidan. Ji loma bi sosret gotê:

– Qey ew dê min bixin der?! Wereqey gotê:

– Belê, kîjan mirov bi doza ku tu pê hatî şandin hatibe, xelkê her û her dijminiya wî kiriye û şerê wî kiriye. Eger ez bigihême wê rojê, ez bimînim li heyetê, ezê pir arîkariya te bikim. Demekê peyxam qut bû. Piştre peyapey hat û nizûla Qur'anê dest pê kir.

## Misilmanbûna Xedîceyê û exlaqê wê

Xedîce xatûnê, pê îman anî û ew bû ya yekem ku bawerî bi Xwedê û qasidê wî anî. Ew li tenişta pêxember (s.) bû; arîkariya wî dikir, piştgiriya wî dikir, derdên wî kêm dikir, barê wî sivik dikir, bela xelkê ji ser wî dida alî û ew diheband.

### Misilmanbûna Elî kurê Ebûtalib û Zeyd kurê Harîse

Piştre Eliyê kurê Ebûtalib Misilman bû ku wê rojê ew, deh salî bû. Ji xwe hê berî Îslamiyetê li cem Pêxember (s.) bû ku di rojên tunetî û tengiyê de ji bavê wî Ebûtalib girtibû, anîbû cem xwe û ew xwedî dikir. Zeyd kurê Harîse, koleyê Pêxember (s.) jî pê bawerî anî ku Pêxember (s.) ew ji xwe re kiribû kur. Evên ku ji her kesî bêhtir nêzîkî wî bûn û bêhtir ew nas dikirin; rastbêjî, dilsadeyî û jînenîgariya wî ya rind dizanîn -xwediyê malê bêtir bi mala xwe dizanin- gişan şehda xwe anî û Misilman bûn.

### Misilmanbûna Ebûbekir kurê Ebûquhafe û bêhnpakiya wî di doza Îslamê de

Ebûbekir kurê Ebûquhafe Misilman bû ku ji ber eqilmendî, bi erzî, kesayetî, bêterefî û navberkariya wî cih û meqamekî wî yê bilind di nav Qureyşiyan de hebû. Wî Misilmanbûna xwe eşkere kir. Ew zilamekî sernerm û jêhezkirî bû, dirûvzan bû, bi bavik û meseleyên Qureyşiyan zana bû, zilamekî bazirgan bû, exleqxweş û naskirî bû. Wî, gaziya Misilmantiyê li yên ku ji nava gelê xwe bi wan bawer bû û li yên ku dihatin cemê û li kêleka wî rûdiniştin dikir.

### Misilmanbûna hin giregirên Qureyşiyan

Bi gaziya Ebûbekirî hin giregirên Qureyşiyan Misilman bûn. Ev kes nava gelê xwe xwedî cih û meqam bûn. Ji wan yek Usman kurê ‘Effan e, Zubeyr kurê ‘Ewam e, Ebdurrahman kurê Ewf e, Se‘d kurê Ebûweqqas û Telhe kurê Ubeydullah e. Vêca ew anîn cem Pêxember (s.) û ew jî Misilman bûn.

Di pey van zilamin din jî ku xwedî şeref û meqam bûn hatin Misilman bûn. Ji wan yek Ebû ‘Ubeyde kurê Cerrah e, Erqam kurê Ebû Erqam e, Usman kurê Mez‘ûn e, Ubeyd kurê Haris kurê Muttelib e, Seîd kurê Zeyd e, Xebbab kurê Eret e, Ebdullah kurê Mesûd e, Emmar kurê Yasir e, Suheyb û hwd. Xwedê ji wan razî be.

Vêca ew qas zilam û pîrek peyapey Misilman bûn ku Îslam belav bû û bû mijûliya xelkê Mekkeyê.

**Gaziya bi eşkereyî li ser Çiyayê Sefayê**

Pêxember (s.) heta ku sê sal di ser pêxemberiya wî re derbas bûn jî wî doza xwe bi dizî dikir. Piştre Xwedê emir lê kir ku ew dînê xwe eşkere bike û gotê: *"Tu, ya ku pê hatî emirkirin eşkere bike û berê xwe ji pûtperestan biguherîne."* (Hicr: 94) Piştre jê re wiha got: *"Eşîra xwe ya nêzîk hişyar bike; perên xwe ji bawermendên ku didin pey te re nizm bike."* (Şu'era 214-215) Dîsa jê re got: *"Bibêje: Ez hişyarekî eşkere me."* (Hicr:89)

Vêca Pêxember (s.) ji mala xwe derket û hilgeriya ser Çiyayê Sefayê û bi dengekî bilind got: "Wey li halê we yê vê sibehê be!" Ev gaziyeke naskirî û hezkirî bû. Çi dema mirovek bi xetera neyarekî dihesiya ku ew dê ji nişka ve êrîşî welatê wî, yan jî êla wî bike bang dikir: Wey li halê we yê vê sibehê be! Vêca Qureyşiyan bi lez bersiva banga wî da, li dora wî kom bûn. Hin zilam bi xwe dihatin û hinan jî qasidekî xwe dişandin.

Çi dema kom bûn. Pêxember (s.) got: Hey mala Ebdulmuttelib! Hey mala Fexr! Hey mala Ke'b! Eger ez ji we re ragihînim ku di pişt vî çiyayî de kerwanek heye û dixwaze êrîşî we bike, ma hûnê ji min bawer bikin?

Ereb milletekî rastîbîn bûn, wan li pêşberî xwe zilamekî wilo dîtin ku ji wî rastî, pêbawerî û şîretkarî dîtibûn. Ew jî li ser çiyayekî wisan sekinîbû ku hem ên li pêşberî xwe hem jî yên li pişt xwe didîtin. Wan jî tenê ber xwe didîtin, ji loma wijdan û eqlê wan berê wan da bawerkirina ji vê ragihandinê rastbêj û pêbawer. Ji loma jê re gotin: Belê.

Ha li virê Pêxember (s.) gote wan: Naxwe ez ji bo we hişyarkerek im. Di navbera destên min de ezabekî dijwar heye. Vêca gel deng nekir, sekinî. Lêbelê Ebûleheb jê re got: Di danê rojê yê mayî de jî helak û bela ji te re be! Qey te ji bo vê yekê gazî me kir?

## Gelê wî eşkere neyartiya wî dike, Ebûtalib jî pişta wî digre

Çi dema Pêxember (s.) eşkere doza Îslamê kir û weke ku Xwedê emirê wî kiribû heqî eşkere got. Gelê wî xwe jê dûr negirtin û redda wî jî nekirin, heta ku wî dev neavêt pûtên wan û seba wan nekir. Vêca çi dema ev kir, wan ev tevgera wî mezin dîtin, li hemberî wî bûne yek û neyartiya wî kirin.

Lêbelê apê wî Ebûtalib pişta wî girt; xwe da ber wî û nehişt tu kes zirarê bidiyê. Pêxember (s.) doza xwe dimeşand, eşkere heqî digot, (tiştek jê venedişart) û Ebûtalib jî pişta wî digirt û ew diparast. Çi gava ev rewş demeke dirêj dewam kir. Hin giregirên Qureyşî çûne bal Ebûtalib û jê re gotin: Hey Ebûtalib! Biraziyê te çêrî pûtên me dike, ola me eybdar dike, xewnên me sivikeqlî didêre û bav û bapîrên me rêşaş dibîne. (Qîma me hew tê), yan tu yê bela wî ji me vekî, yan jî tu yê ji navbera me û wî derkevî, lewra tu jî li ser ol û baweriya me yî.

Vêca Ebûtalib, ji wan re xebereke nerm got, ew bi xweşikayî vegerandin û ew ji cemê derketin.

## Di navbera Pêxember û Ebûtalib de

Qureyşiyan, pir behsa pêxember (s.) kir, li hemberî wî nav di hev dan û careke dî çûne cem Ebûtalib û jê re gotin: Hey Ebûtalib! Tu rihspiyê me yî, li cem me xwedî rûmet û meqam î, em ji te hêvî dikin ku tu nehêlî biraziyê te bavêje me. Vêca eger tu vê nekî em nikarin li hemberî seba bapîrên xwe, bêeqildêrîna xewnên xwe û eybdarkirina pûtên xwe bêtir xwe ragirin, qîma me hew tê, yan tu yê bela wî ji me vekî, yan jî emê te û wî yek zanibin û emê şerê hev bikin heta ku ji herdu bendan yek ji me ji holê rabe.

Ji bo Ebûtalib mezin û zehmet hat ku neyartiya gelê xwe bike û ji wan cuda bibe, dilê wî arî wî nedikir ku Pêxember (s.) jî bispêre wan. Ji loma şande pey Pêxember (s.) û jê re wiha

got: Birazî! Gelê te hatin bal min û ji min re halo û halo gotin. Ji bo min û ji bo xwe bisekine û barê ku qeweta min jê re nîne li min bar neke.

## Heke rojê deynin rastê min û heyvê deynin çepê min jî

Ji Pêxember (s.) were ku Ebûtalib di bara wî de guheriye; xwe ji pişta wî daye alî û hew arî wî dike. Ji loma jê re wiha got:

– Apo! Wellahî heke ew rojê deynin rastê min û heyvê jî deynin çepê min ji bo ez dev ji vî dînî berdim, ezê dîsa dev jê bernedim, heya Xwedê wî dînî serfiraz (û eşkere) bike, yan jî ez di oxira wî de bimirim!

Çavên Pêxemberî (s.) hêstir barandin û giriya. Piştre rabû ser xwe. Gava çû Ebûtalib gazî kiriyê û jê re got:

– Birazî! Berê xwe bide min. Pêxember (s.) jî berê xwe dayê. Vêca jê re got:

– Birazî! Here û tişta ku tu bivê wê bibêje. Wellahî ezê te teslîmî tu kesî nekim!

## Qureyşî, îşkencê didin Misilmanan

Pêxember (s.) doza xwe dimeşand û Qureyşiyan jî hêviya xwe ji wî û Ebûtalib birrîn. Vêca qehr û hêrsa wan li Misilmanên ku ji êlên wan bûn barî. Lewra tu kes tunebû ku nehêle neheqiyê li Misilmanan bikin. Her qebîleyê êrîşî Misilmanên xwe kirin; ew digirtin û bi birçîkirinê, tîhiştinê û lêdanê îşkence dikirin. Ew li kelegerma Mekkeyê hem jî gava germî tam dijwar dibû didan ezabê. Wek numûne:

Bilalê Hebeşî -Misilman bûbû- xwendê wî Umeyye kurê Xelef gava dibû naveroj, tam dibû çiqeçiqa germiyê ew derdixist newala Mekkeyê li ser piştê gêr dikir, kevirê mezin dixwest, jê re dianîn, ew datanî ser singa wî, piştre jê re wiha digot:

– Wellahî! Tu yê her wiha bimînî heta ku tu bimirî, yan jî ji Mûhemmed bawer nekî û Lat û Uzzay bihebînî! Bilal jî di wê îşkencê de wiha digot: Xwedê Yek e, Yek e. Bilal di binê vê îşkenceya giran de ma. Paşîkê Ebûbekirê Siddîq (r.) di ber re derbas bû, di şûna wî de koleyekî çermreş û hê ji wî xurttir da Umeyye û Bilal jê stend û ew azad kir.

Mala Mexzûm, gava naverojê hewa tam disincirî 'Emmar kurê Yasir, bavê wî û dayika wî Sumeyye -ferdên vê malê hemû Misilman bûn- derdixistin newala germ a Mekkeyê û îşkence li wan dikirin. Pêxemberê Xwedê (s.) di ber wan re dibuhurî û digote wan: Mala Yasir, sebrê bikşînin! Êwirgeha we bihişt e. Herçî ku dayika wî Sumeyye bû, ew kuştin jî, dîsa ji Îslamê venegeriya.

Mûseb kurê Umeyr, bi xortanî, spehîtî û xurûra xwe egîdê Mekkeyê bû. Dayika wî jineke pir maldar bû. Cilên herî xweşik li wî dikirin. Mûseb bihîst ku Pêxember (s.) li Mala Erqem kurê Ebûl-Erqem doza Îslamê dike. Vêca wî qesda Pêxember (s.) kir; çû balê, îman pê anî, Misilman bû, ji cemê hate der û ji tirsa dayîk û gelê xwe îmana xwe veşartî hişt. Bi dizîka diçû cem Pêxemberî (s.) Usman kurê Telhe dît ku ew nimêj dike. Vêca giliyê wî ji dayik û gelê wî re kir. Wan jî ew girtin û hebs kirin. Welê hebskirî ma, heta ku di hîcreta pêşîn de ew jî derkete welatê Hebeşistanê û xwe ji hebsê rizgar kir. Piştre gava Misilman vegeriyan ew jî bi wan re vegeriya. Halê wî guherî bû; pir nexweş bûbû. Lewra dayîka wî berê nedihişt ku azar û tehlî bigihiyê.

Hin Misilman ketibûn bextê giregir û malmezinên Qureyşiyan ên pûtperest ku ew dihebandin û nedihiştin azar bigihêje wan. Usman kurê Mez'ûn ketibû bextê Welîd kurê Muxîre. Lêbelê piştre xîreta Usmanî ev yek qebûl nekir û ji ber bextê wî derket. Welîd mirovekî wefadar, camêr û bi bext bû. Digel vê jî Usman jê re got: Ez hez nakim ku ji bilî Xwedê bikevim bextê yekî din. Munaqeşe di neqeba Usmanî û yekî pûtperest de derket. Usman ew kesê pûtperest hêrs kir. Vêca

ewê pûtperest rabû ser xwe, kulmek danî çavê wî û şîn û reş kir. Welîd kurê Muxîre li nêzîkî wan bû. Ev rewşa ha dît û ji Usmanî re got: Birayê min! Wellahî herçî ku çavê te ye hîç hewce nebû kulm bixwara. Tu di ber bextekî asê de bûyî, (lêbelê hedana te nehat).

Vêca Usman jê re wiha got: Wellahî hewceyiya çavê min ê rehet jî bi wê derbeya ku hevalê wî di rêya Xwedê de xwarî heye. Hey Ebû Ebduş-Şems! Ez di ber bextê Xwedayekî de me ku ew ji te xurttir e.

## Qureyşî şerê pêxember dikin cur bi cur îşkence didinê

Çi dema Qureyşî têk çûn û nekariyan wan xortên Misilman ji dînê wan vegerînin û Pêxember (s.) jî li hemberî wan nerm nebû; ji wan hez nekir. Ev rewşa ha pir li zora wan çû. Ji loma nav li eqilsivikên xwe dan ji bo Pêxember (s.) biêşînin; ew derewandin, xwîn jê rijandin û bi sêhrbaziyê, şairtiyê (hozaniyê), rimildariyê û dînîtiyê devdiavêtinê û bi eziyetên cur bi cur ew êşandin û li hemberî wî hemû şop û rê bi kar anîn.

Giregirên Qureyşî rojekê li ber hicra Kabeyê bûn. Pêxember (s.) jî bi ser wan de hat, di ber wan re derbas bû, çû tewafa Kabeyê û li dora wê geriya. Vêca wan jî bi gotinên tehl dev avêtinê û mekrohiyên xwe sê caran dubare kirin. Vêca Pêxember (s.) li ber wan rawestiya. Dûvre ji wan re wiha got:

Gelî civata Qureyşiyan! Hûn dengê min dibihîzin. Ez bi wî Xwedayî sond dixwim ku jiyana min di destê wî de ye! Vê baş bizanibin ku ez bi serjêkirinê ji we re hatime şandin.

Vêca Qureyşî mane bêdeng, tevnegeriyan û bi ber dilê wî ve çûn; gotinên nerm û xweş jê re gotin.

Çi dema bû sibeha din, ew dîsa li cihê xwe bûn. Pêxember (s.) jî bi ser wan de hat. Tevan bi derbekî xwe çen kirinê; dor lê girtin û ji wan yekî bi kurkê wî girt û berneda. Ebûbekir (r.) jî rabû ser xwe nehişt ew tiştekî pê bike, digirî û digot: Qey

zilamekî ku bibêje: Xwedayê min Xwedê ye, hûn dê çawa wî bikujin?! Ji loma wan bela xwe jê vekir. Wê rojê, Ebûbekir serşikandî û rihkişandî vegeriya malê.

Rojekê Pêxember (s.) ji mala xwe derket ku, çi kole, çi ne kole, kesê ku ew dîtî tevan ew derewandin û êşandin. Wê rojê vegeriya malê. Ji ber êş û azara ku gihabûyê kete nava nivînê û cil bi ser xwe de kirin. Vêca Xwedê di bara vê rewşa wî de ev ayeta ha nazil kir: *"Hey cil li xwe werdayo! Rabe ser xwe û (xelkê ji ezabê Xwedê) hişyar bike."* (Muddessir: 1, 2)

## Ya ku kafirên Qureyşî anîn serê Ebûbekir?!

Ebûbekir (r.) rojekê rabû ser xwe, xelk gazî dînê Xwedê û qasidê wî dikirin. Pûtperestan êrîşî wî kir; ew avêtin bin lingên xwe û gelekî lêdan. Eqebe kurê Rebî'e jî rahişt herdu ferên sola xwe û pê li rûyê wî dida û ya nemayê anî serê wî. Piştî vê lêdanê rûyê wî û bêvila wî ji hev nedihatin veqetandin.

Mala Teym, rahiştin Ebûbekir û bi mirîtî ew birin malê. Ew qas lê dabûn heta ku ji axaftinê ketibû. Tu kesî bawer nedikir ku ewê dîsa rabe ser xwe. Heta danê êvarê wisan bêhal ma. Gava madê wî geriya got: Pêxember (s.) çawa ye, çi dike? Wan jî dev avêtinê: Lome lê kirin û ji dora wî çûn. Ummcemîl ji wan kesan bû ku Misilman bûbû, nêzî wî bû û wî pirsa Pêxember (s.) ji wê kir. Jê re got: Baş e, rehet e. Ji wê re got: Min we'da be! Heta ku ez neçim cem Pêxember (s.) ezê xwarinê te'm nekim û avê venexwim. Vêca wan xwe girt. Heta ku pîçekî kariya lingên xwe bide ber xwe û xelk bêdeng bûn, ew ketin bin milên wî û hêdî hêdî ew anîn cem Pêxember (s.) Gava Pêxember (s.) ew di vî halê xirab de dît, pir li ber ket. Ji bo dayika wî dua kir û ew gazî Misilmantiyê kir. Vêca ew jî Misilman bû.

## Nîqaşa Qureyşiyan di bara wesfê Pêxember de

Qureyşiyan di bara Pêxember (s.) de bi hev re dipeyivîn ka ewê bi çi wesfî wî bidin naskirin? Ew dê çawa di navbera

wî û guhdarên wî; ew rêwiyên ku ji dûr ve dihatin Mekkeyê û qesda wî dikirin de bibin asteng? Bi vê armancê tev çûne cem Welîd kurê Muxîreyî ku ew rihsipiyê wan bû. Hem jî demsala ku ereb werin Mekkeyê hatibû. Vêca bi vê munasebetê Welîdî ji wan re wiha got:

"Gelî civata Qureyşiyan! Demsala Hecê dest pê kiriye. Karwanê Ereban dê bêne Mekkeyê. Hemin wan nûçeya mirovê we jî bihîstiye. Naxwe hûn ramanê xwe di bara wî de bikin yek û ji hev cuda nebin. Heke hûn ji hev cuda bibin; hin ji we dê hinan biderewînin û gotinên hev vegerînin. Sohbeteke dirêj di nav wan de derbas bû; hin jê hate girtin, qebûlkirin û hin jî hate vegerandin, red kirin."

Welîd kurê Muxîre pêşniyara wan qebûl nekir. Ew li wî vegeriyan û jê re wiha gotin:

"Hey Ebû Ebduş-Şems! Ma tu çi dibêjî?" Gote wan:

"Ya maqûl ev e ku hûn bibêjin; ew sêhirbaz e. Sêhreke wisan aniye ku kare pê kur û bavî, bira û birayê wî, mêr û jina wî, xwedî û mirovên wî ji hev biqetîne."

Wan jî fikra wî qebûl kirin û ji cemê derketin. Li ber keviya rêyên ku dihatin Mekkeyê rûdiniştin. Gava xelkê qesda mewsimî dikirin, dihatin. Vêca kî di ber wan re derbas bûbana ew hişyar dikirin û ji wan re bi xirabî behsa Pêxember (s.) dikirin.

### Qureyşî, îşkenceya herî dijwar didin Pêxember

Qureyşiyan, hunerê cur bi cur ên îşkenceyê li Pêxemberî (s.) kirin. Bi dilhişkî û barbarî bi ser wî de çûn. Di bara wî de li pismamtî û eqrebatiyê nemeyzandin û li tixûbê mirovatiyê nesekinîn. Rojekê li mizgeftê serê Pêxember (s.) di sicûdê de bû. Hin peyayên Qureyşî jî li dora wî hebûn. Eqebe kurê Ebûmu'ît hat. Pizanekî devehen di destê wî de bû, avête ser pişta Pêxember (s.) ew wisan li ser pişta wî man û Pêxember (s.) serê xwe ranekir. Heta ku qîza wî Fatîme hat û ew pizan ji

pişta wî avêt. Vêca li wî kesê ku ev yek kir, nifir kir û Pêxember (s.) jî nifir li wan kir.

Careke din jî Pêxember (s.) li Kabeyê nimêj dikir, Eqebe kurê Ebûmu'ît hat cilên wî xistin stûyê wî, şidand û kir ku wî bixeniqîne. Ebûbekir (r.) bi milên wî girt, bela wî ji Pêxember (s.) vekir û jê re wiha got: Ma zilamekî ku bibêje: Xwedayê min Ellah e, hûn dê çawa wî bikujin?!

### Misilmanbûna Hemzeyê kurê Ebdulmuttelib

Pêxember, (s.) rojekê li nik sefayê bû. Ebûcehîl di ber re derbas bû, dujin lê kirin û ew êşand. Lêbelê Pêxember (s.) bersiva wî neda û berê xwe jê zîvirand. Hê demeke dirêj di ser vê bûyerê re derbas nebûbû, serê Hemzeyê kurê Ebdulmuttelîb da der, şûrê wî li milê wî bû û ji nêçîrê vedigeriya. Hemze, di nava Qureyşiyan de xortekî berxweketî, hijxwekirî û bi erz bû. Koleyê Ebdullah kurê Cud'an ya ku Ebûcehil anîbû serê Pêxember (s.) jê re ragihand. Hemze gelekî hêrs bû, bêhna wî teng bû, kete mizgeftê, dît ku wa ye Ebûcehil li nava civatê rûniştiye. Berê xwe dayê û bi aliyê wî ve çû heyanî giha ber serê wî, rahişte kevan û li serê wî xist. Vêca di serê wî de birîneke xeddar vekir. Piştre jê re wiha got: Tu dijûnan li wî kesê ku û ez jî li ser dînê wî me dikî ha! Tişta ku ew dibêje, ez jî dibêjim! Ebûcehîl deng nekir. Hemze Misilman bû. Ji ber şûnwar û lehengiya Hemze ya li nav Qureyşiyan ev yek li wan pir nexweş hat.

### Hevpeyivîna Pêxember û 'Utbe

Çi gava Qureyşiyan dît ku waye hejmara hevalên Pêxember (s.) pir dibe, 'Utbe destûr ji Qureyşiyan xwest ku biçe bi Pêxember (s.) re bipeyive û hin teklîfan pêşniyazî wî bike. Belkî hin pêşniyaran ji wan qebûl bike. Êdî wan bidinê û ew jî bela xwe ji wan veke. Qureyşiyan ew qebûl kirin û ew kirin wekîlê xwe.

Vêca 'Utbe, hate cem Pêxember (s.) li kêleka wî rûnişt û jê re wiha got:

– Kurmam! Wekî ku tu dizanî tu yek ji me yî. Tu bi karekî mezin hatî cem gelê xwe. Te pê yekîtiya wan ji hev qetand, te xewn û xeyalên wan pûç kir, te pê ol û pûtên wan eybdar û şeht kir. Te pê bav û kalên wan ên ku bihurîne kafir dêriya. Vêga tu guhê xwe bide min; ezê ji te re hin teklîfan pêşniyaz bikim. Vêca tu jî li wan hûr binêre. Dibe ku tu hinan ji wan qebûl bikî.

Vêca Pêxember (s.) jê re wiha got:

– Bavê Welîd! Kerem bike, teklîfên xwe bibêje, ez guhdarî bikim, bibînim. Jê re got:

– Pismam! Eger mebesta te, bi vî dînê ku tu pê hatî şandin mal be, em ê ji te re ji malê xwe serwetê kom bikin heta tu bibî zengînê me. Eger tu pê şerefê dixwazî, emê te bikin mezinê xwe û emê bêyî te tu karekî nebirrin. Heger tu pê desthilatiyê dixwazî emê te bikin padîşahê xwe. Heger eva ku ji te re tê girtinek ji cinan be û tu bi xwe nikarî wê ji xwe vegerînî, emê te li ser doktor û hekîman bigerînin, emê malê xwe gişî li te bidin, heta ku em te jê rehet û mufa bikin.

Çi dema 'Utbe gotina xwe xilas kir. Pêxember (s.) jê re wiha got:

– Bavê Welîd! Ya te temam bû?

– Belê.

– Ji kerema xwe, de tu jî li min guhdarî bike.

– Belê, ez jî guhdarî dikim. Vêca Pêxember (s.) jê re ji Sûretê Fussîlet heta bi Sûretê Secdeyê hin ayet xwendin.

Gava 'Utbe guhdarî kir. Ji bo xwendina wan rawestiya; destê xw e da pişta xwe û bi paldayikî guhdarî dikir. Çi dema Pêxember (s.) xwendina xwe timam kir. Çû sicûdê. Piştre jê re wiha got:

"Bavê Welîd! Ya ku te bihîst te bihîst. Vêga tu û ew li hev."

'Utbe rabû ser xwe, çû nik hevalên xwe û wan ji hev re got: Em bi Xwedê sond dixwin ku Bavê Welîd tê nik we lê ne bi wî rûyê ku pê çûye! Çi dema li cem wan rûnişt, gotinê:

Bavê Welîd! Li pey te çi heye? Gote wan:

Li pey min, (ev heye:) min gotinek wisan guhdarî kir ku min tiştekî welê hîç nebihîstiye. Sond bi navê Xwedê be ku ew ne şiîr e, ne sêhr e, ne jî rimildarî ye. Gelî Qureyşiyan! Bi ya min bikin û ji rêya vî zilamî û dînê wî derkevin, jê re nebin asteng. Lêbelê wan rexne li wî girtin û gotinê:

Bavê Welîd! Wellahî wî bi zimanê xwe sêhr li te jî kiriye, tu jî girêdayî. Gote wan: Ev ray û ramana min e, di bara wî de. Vêca hûn bi kêfa xwe ne.

### Hîcreta Misilmanan a bi bal Hebeşistanê

Çi gava Pêxember (s.) dît ku waye hevalên wî dikevin îşkenceyê û ew jî nikare wan biparêze. Ji wan re wiha got: "Xwezî hûn biçûna welatê Hebeşistanê (Somaliyê), qralekî wê heye ku li cem wî zulim li tu kesî nayê kirin." Ew welatê rastiyê ye. Heta ku Xwedê ji we re fereceke xêrê bişîne û we ji vê eziyeta ku hûn tê de ne, rizgar bike.

Piştî vê şîreta Pêxember (s.) komek Misilman ji Mekkeyê derketin çûne Hebeşistanê. Ev bû Hîcreta yekem di tarîxa Îslamê de. Muhacir deh zilam bûn ku pêşîvanê wan jî Usman kurê Mez'ûn bû. Piştre Cafer kurê Ebûtalib derket û peyapey Misilmanan hîcret kir. Paşîkê li welatê Hebeşistanê kom bûn. Hin ji wan bi tenê hîcret kiribûn. Hinan jî digel malbatên xwe. Hejmara muhacirên Hebeşistanê gihabû heştê û sê zilaman.

### Qureyşî, li pey Misilmanan diçin

Çi gava Qureyşiyan dît ku waye Misilman li Habeşistanê gihane êminî û asayîşê. Rabûn Ebdullah kurê Ebû Rebî'e û Emr kurê Asê kurê Waîl li pey wan şandin; gelek xelatên bi qedr

û zerîf ên Mekkeyê dane wan û ji Necaşî û fermandarên wî yên pisporê cengê re şandin. Vêca ew qasid çûne cem Necaşî û serdarên wî jî bi dil bûbûne alîgirên wan; bi xelatên xwe ew qayil kirin, li dîwana qral axivîn û wiha gotin: "Hin aqilsivik û hin bendeyên me xwe avêtine welatê padîşah. Ji ola gelê xwe derketine lê neketine ola we jî. Wan oleke nû û nenas anîne ku ne em û ne hûn wê nas dikin. Hîç guman nîne ku giregirê gelê wan: Bav, ap û nêzên wan vaye em şandine da ku hûn wan li xwediyên wan vegerînin. Lewra ew ji we bêtir wan nas dikin û nêzîktirên wan in." Qumandarên ku li dora Necaşî bûn gotê: Padişahê me! Van rast got. Wan bispêre wan.

Ji ber pêşniyaza wan Necaşî hêrs bû, gotina wan qebûl nekir û li ber teslîmkirina Misilmanên ku xwe li wî girtine û hatine welatê wî qebûl nekir. Sond xwar ku ew dê vê neke û şande pey Misilmanan; gazî wan û zanayên filehan jî kir û ji Misilmanan re got: "Çi ye ev dînê ku hûn ji gelê we qetandine? Hûn neketine dînê min û neketine ola tu milletan jî?!"

### Cafer kurê Ebûtalib, taristaniyê teswîr dike, Îslamê dinasîne

Kurapê Pêxember (s.) Cafer kurê Ebûtalib rabû piya û gotê: "Hey padişah! Em xelkekî ehlê cahiliyetê bûn; em pûtperest bûn. Me mirar dixwarin. Me tixûbê helalî û heramiyê nas nedikir. Em li xizmîtiyê xwedî dernediketin. Me cîranê xwe talan dikirin. Ji me yên xurt, yê qels dixwarin û em bi vî awayî bûn. Paşîkê Xwedê ji nava me zilamek ji me re bi pêxemberî şand ku em nesaba wî, rastgoyîtiya wî, ewledêriya wî û dilpaqijiya wî dizanin. Wî, em gazî Xwedê kirin da ku em wî yek bidêrin; îbadetê wî bi tenê bikin û em dev ji îbadetê kevir û pûtên ku bav û kalên me îbadet wan dikir berdin. Emir li me dike ku em rast bipeyivin, sipereyan ji stûyê xwe bikin, xizmîtiyê germ bigrin, ji ciranên xwe re baş bin, heramî û xwînrêhtinê terk bikin. Fihûş, gotina derew, xwarina malê sêwiyan û îftiraya li jinên bi namûs û bêhay li me qedexe kiriye. Emir li me kiriye ku em

îbadetê Xwedê bi tenê bikin, em tiştekî nekin hevparê wî. Dîsa emrê me kir ku em nimêjê bikin, zekatê bidin- û fermanên Îslamê ji Necaşî re jimartin- Me jî ew rast dêra û pê îman anî. Me da pey wehya ku ji cem Xwedayê wî jê re hatiye. Me îbadeta Xwedê bi tenê kir û em tiştekî jê re nakin şirîk. Me, ya ku ji me re heram e, li xwe qedexe kir û me, ya ku ji me re helal e, li xwe serbest kir. Vêca gelê me zulim li me kir, îşkence li me kir û teşebus kirin ku me ji dînê me vegerînin da ku me ji îbadetê Xwedê vegerînin îbadetê pûtan û em xirabî û bêtoreyiyan li xwe helal bikin, wekî ku beriya em Misilman bibin, me ji xwe re helal dikir. Vêca gava wan jan dane me; zulm li me kir, dor li me teng kir û nehiştin em li gorî dînê xwe bijîn û bi vî awayî ketin navbera me û dînê me. Ey Padîşah! Me jî hîcretî welatê te kir; me tu di ser xeyrê te re girtî û me xwest bikevin ber bextê te û me hêvî heye ku li cem te zulm li me nebe. Necaşî ev giş bi sergiranî û jidilî guhdarî kirin. Piştre got:

– Gelo ji ya ku hevalê we ji nik Xwedê ve pê hatiye şandin tiştek bi te re heye? Cafer jê re got:

– Belê. Necaşî jê re got:

– Ji kerema xwe, ka ji min re bixwîne. Caferî, ji serê Sûretê Meryem jê re xwend.

Necaşî giriya, hêstirê wî bariyan heta ku riha xwe şil kir û zanayên Filetiyê jî giriyan heta ku wan jî mishefên xwe şil û pil kirin.

### Heyeta Qureyşiyan negiha armanca xwe

Piştre Necaşî got: "Bêguman ev dîn û dînê ku Îsa pê hatî şandin ji kulekekî dertên" Berê xwe da qasidên Qureyşiyan û gote wan: "Hûn herin. Ez bi Xwedê sond dixwim ku ezê wan nesipêrim we!"

Emrê kurê As sibehê çû careke dî jî Necaşî dît û jê re got:

"Hey Padîşah! Ew, di bara Îsa kurê Meryemê de gotineke mezin dibêjin." Necaşî dîsa berê xwe da Misilmanan û ji wan re got:

– Hûn di bara Îsa kurê Meryemê de çi dibêjin? Cafer kurê Ebûtalib jê re got:

– Em di bara wî de ya ku Pêxemberê me pê hatiye şandin dibêjin ku ew jî ev e: “Ew bendeyê Xwedê, qasidê wî, ji rihê wî û -berhema- gotina wî ye. Ji Meryema keçik û bi namûs re ragihandiye.” vêca Necaşî destê xwe danî ser erdê; rahişt darikekî piştre wiha got: “Wellahî Îsa kurê Meryemê, bi qandî vî darikî jî pirtirî ji ya ku te ragihand negotiye.”

Necaşî bersiveke camêrane da Misilmanan; bextê xwe da wan û ew qasidên Qureyşî bi rûreşî ji cemê derketin.

### Misilmanbûna Umerê kurê Xettab

Xwedê, bi Misilmanbûna Umerê kurê Xettab yê Eddewî yê Qureyşî piştgiriya Îslamê û Misilmanan kir. Umer zilamekî bi heybet, xurt û rikdar bû. Pêxember (s.) ji dilûcan dixwest ew Misilman bibe û ji bo vê yekê dua ji Xwedê dikir. Hadîseya Misilmanbûna wî wiha rûda; xweha wî Fatîmeya keça Xettab û mêrê xwe Seîdê kurê Zeyd Misilman bûbûn. Lêbelê wan Misilmantiya xwe ji Umer vedişart. Lewra ew li hemberî îslamê û Misilmanan mirovekî pir dijwar û xeddar bû. Xebbabê kurê Eret jî dihat mala xweha wî û ew hînî Qur’anê dikirin.

Umer bihîstibû ku Pêxember (s.) û çend hevalên xwe li malekê li cem Sefayê dicivin. Ji loma rahişt şûrê xwe û ji mal derket; çû qesta kuştina wan bike. Nu‘eymê kurê Ebdullah ku ji qewmê wî mala Eddî bû -ev mirov Misilman bûbû- rastî wî hat û gotiyê:

– Hey Umer! Tu diçî ku?

– Ez diçime Mûhemmedê jirêderketî; ewê ku Qureyşî kirine dubend, xewnên wan pûç dêriyane, dînê wan eybdar kiriye, dijûn ji pûtên wan re kirine. Ji loma ezê wî bikujim.

– Hey Umer! Te rêya xwe şaş kiriye. Çima tu venagerî mala xwe û ehlê xwe rast nakî?

– Kîjan ehlê mala min?

– Kurapê te, zavayê te, Seîd kurê Zeyd û xuşka te Fatîmeya qîza Xettab (qey birra tu nizanî) herdu jî Misilman bûne û dane pey dînê Mûhemmed. Êdî here wan rast bike.

Umer vegeriya û qesda zavayê xwe û xuşka xwe kir. Xebbab kurê Eret jî li nik wan bû. Rûpelekî Qur'anê pê re bû, tê de Sûretê Taha nivîsî bû; nîşanî wan dida. Gava wan pêjna Umer kir, Xebbab xwe li odeka piçûçik veşart. Fatîmeyê rahişt rûpel û xist bin ranê xwe. Lêbelê Umer, gava nêzîkî malê bûbû. Dengê xwendina Xebbabî çûbû guhê wî. Ji loma gava kete hundur got:

– Ev çi deng e ku nayê fehmkirin?

– Na, me tiştek nebihîstiye.

– Na, wellah! Min bihîstiye ku hûn Misilman bûne û we daye pey dînê Mûhemmed. Umer, xwe çen kir zavayê xwe Seîdê kurê Zeyd. Xweha wî rabû ji bo bela wî ji mêrê xwe veke. Vêca Umer kulmek daniye û ew birîndar kir. Çi gava Umer ev bizava nelirê kir. Xweha wî û zavayê wî gotinê:

Belê rast e, em Misilman bûne û me îman bi Xwedê û pêxemberê wî aniye. Vêca çi ji te tê, bike.

Çi dema Umer dît ku wa ye xwîn ji xweha wî rijiya. Li kirina xwe poşman bû, sekinî û ji xweha xwe re wiha got:

– Ka vê rûpelê bide min; ku vêga min dengê we bihîst we dixwend. Ez binêrim çi ye, eva ku Mûhemmed pê hatiye şandin? Umer mirovekî xwenda bû. Gava ev got. Xweha wî gotiyê:

Em ji te ne piştrast in. Vêca jê re got:

– Na, ji min netirsin û jê re bi îlahê xwe sond xwar ku ew dê tiştekî jê neke.

Çi dema Umer ev got. Hêviya xweha wî xurt bû ku ew Misilman bibe. Vêca jê re got:

– Keko! Tu ne paqij î; li ser ola pûtperestiyê yî! Rastî jî ev e ku mirovê nepaqij neşên dest bidinê. Ji loma Umerî rabû xwe

şûşt. Vêca wê jî rûpel dayê ku tê de Sûretê Taha nivîsandî bû. Çi dema Umerî serê rûpelî xwend. Wiha got: Zehî! Ev kelam çi qasî xweş û rind e!

Çi dema Xebbab dengê vê gotina wî bihîst. Di cih de ji cihê xwe derket û jê re got:

– Hey Umer! Ez bi Xwedê sond dixwim, vê ji min bawer bike; min hêvî heye ku Xwedê tu bi ber duayê Pêxemberê xwe xistibe. Lewra min duhî dengê wî bihîst ku digot: Xwedayê min! Piştgiriya Misilmantiyê, yan bi Ebûhîkemê kurê Hişam (Ebûcehîl), yan jî bi Umerê kurê Xettab bike û wê bi yekî ji herduyan xurt bike. Hey Umer! Tu bi Xwedê kî, bi Xwedê kî Misilman bibe!

Gava Xebbab ev jê re got. Umer jê re got:

– Hey Xebbab! Mûhemmed nîşanî min bide li ku ye? Da ku ez herim cemê û Misilman bibim. Xebbab jê re got:

– Ew digel çend hevalên xwe li malekê ne ku ew li cem Sefayê ye.

Vêca Umerî rahişte şûrê xwe, di ber xwe kir û berê xwe da cihê Pêxember (s.) û hevalên wî û li deriyê wan xist. Çi dema wan dengê wî bihîst. Zilamekî ji hevalên Pêxember (s.) rabû, di qulika derî de meyzand ku Umer e, û şûrê wî di destê wî de ye, bi endîşe li Pêxember (s.) vegeriya û jê re got: Hey qasidê Xwedê! Ev Umerê kurê Xettab e, şûrê wî tazî ye, di destê wî de ye.

Hemzeyê kurê Ebdulmuttelib jê re got:

– Destûra wî bide bila were. Heger qenciyê bixwaze, emê wê bidinê, eger neqenciyê bixwaze, emê wî bi şûrê wî bikujin. Pêxember (s.) gotê:

– Destûrê bidiyê.

Zilam jî destûr dayê. Pêxember (s.) bi ber ve rabû, li ber derî çav pêket, bi berstika wî -anku- bi herdu rexê kurkê wî girt, bi dijwarî kişand û gotê:

– Hey Umerê kurê Xettab! Tu bi çi hatî? Wellahî ez dibînim ku tu yê negihêjî vegerê heta ku Xwedê bi te qêrînekê neşîne. Umer jê re got:

– Hey qasidê Xwedê! Ez hatime bal te ji bo ku îmanê bi Xwedê, bi qasidê wî û bi ya ku tu pê hatî şandin bînim.

Vêca Pêxember (s.) Ellahû Ekberek wisan got ku hevalê wî yên xwediyê malê zanîn ku Umer Misilman bûye. Misilmanan, di dilê wan de hêviya wan xurt bû ku Umer Misilman bû û berî wî jî Hemze Misilman bûbû. Umer, Misilmantiya xwe eşkere kir û ev nûçe li nav Qureyşiyan belav bû. Ji loma wan şerê wî kir û wî jî şerê wan kir. Paşîkê hêviya xwe jê birrîn.

### Qureyşî embargoyê datînin ser Mala Haşim, dorê li wan digirin

Îslam, li nava qabîleyê Ereban belav dibû. Qureyşî gihane hev û civiyan ku peymanekê di navbera xwe de binivîsin, peymanê bidin hev û wê deynin ser mala Haşim û mala Ebdulmuttalib ku ew bi keçên wan re nezewicin û jinan jî nedin wan, tiştekî nefiroşin wan û ji wan nekirrin. Çi dema wan li ser vê li hev kirin, ev peyman di rûpelekê de nivîsîn. Piştre soz dane hev û li ser wê qinyata hev anîn û ji bo baweriya wan bi hev were kaxez jî bi nava Kabeyê ve daleqandin.

### Li ber ocaxa Ebûtalib

Gava Qureyşiyan ev kir. Mala Haşim û mala Muttelib xwe li Ebûtalib dane hev û ketin ber ocaxa wî ku ev bûyer di sala hevtemîn a Pêxembertiya Mûhemmed (s.) de qewimiye. Ebûlehebê kurê Ebdulmuttelib ji nav mala Haşim derket û xwe da rexê Qureyşiyan. Mala Haşim li ber ocaxa Ebûtalib man û paşîkê ji ber dortengkirina embargoyê ketin nava tengiyê; pelên daran dixwarin, zarokên wan ji nêza (birçiya) dikirin qîreqîr, heta ku ji ber biçîbûnê dengê giriyê wan ji dûr ve dihat bihîstin. Qureyşî jî diketin nava wan û taciran û li wan biha giran dikirin ji bo ku nikaribin ji xwe re zad bikirin.

Vê embargoyê tam sê salan dewam kir. Qureyşiyên ku bi wan re diketin têkiliyê tenha bi dizîka karîbûn hin tiştan bigihînin wan. Pêxember (s.) jî di vê tengerewşê de bi şev û roj, bi eşkereyî û bi dizîka xelk gazî Îslamê dikirin û mala Haşim jî sebr dikirin.

### Xerakirina peymanê û rakirina embargoyê

Çend kesên bi wijdan û bêhnpak ji nava Qureyşiyan- ku di serê van de jî Hişamê kurê Emrê kurê Rebî' tê- rabûn ser xwe ev peymana neheq nexwestin û ew li zora wan çû. Lewra Hîşam zilamekî bi dewlet û xizimhez bû. Li nava gelê xwe xwedan-şeref û rûmet bû. Ew çû nik hin peyayên Qureyşî; nav di wan da, di wan de hestê merhemet û diltenikiyê pêxist, xîret, însaniyet û wijdanê wan ajote xirakirina peymanê û derketina ji vê tifaqa neheq û zalim. Çi dema ew bûne pênc, ji bo xerakirina peymanê li hev hatin û di demeke ku Qureyşî di civîna xwe de bûn, Zuheyrê kurê Ebûumeyye- ku dêya wî Atîke qîza Ebdulmuttelibî bû- rabû ser xwe, berê xwe da xelkê û wiha got:

– Gelî xelkê Mekkeyê! Qey emê bixwin, cilan li xwe bikin û bila mala Haşim jî bimrin; ew nikaribin tiştekê bikirin û bifiroşin?! Ez bi Xwedê sûnd dixwim ku ez dê nerûnim heta ev kaxeza zalimane neyê qetandin.

Ebûcehîl rabû peyivî -da ku wî îqna bike- lêbelê peyva wî fêde neda. Mut'imê kurê Eddiyî rabû ku kaxezê biqetîne, meyzand ku waye ji "Bi navê Xwedayê min" pê ve bizûzê ew xwariye!

Jixwe Pêxember (s.) ev yek ji Ebûtalib re ragihandibû. Kaxeza peymanê hate perçekirin û xalên nava wê pûç û betal bûn.

### Wefata Ebûtalib û Xedîceyê

Ebûtalib û Xedîce herdu di salekê de; di sala dehemîn a pêxembertiyê de wefat kirin. Jixwe ji we ve me'lûm e ka wan çi qasî pişta Pêxember (s.) girtine, arî wî kirine û xweşhevaltiya wî kirine. Ew ji bo Pêxember (s.) sozdar û wefadar bûn. Ebûtalib ew nesipartibû pûtperestan. Piştî mirina wan tehlî û reşî peyapey bi ser Pêxember (s.) ve hatin.

## Qur'an di dilên paqij de bi cih bû

Tufeylê kurê Emrê Dewsî hate Mekkeyê. Ew zilamekî bi rûmet, şair û bîrewer bû. Qureyşî ketin navbera wî û Pêxember (s.), ew ji nêzbûna Pêxemberî (s.) û guhdarîkirina li wî ditirsandin û jê re wiha digotin: Ya rast, em ditirsin ku ya hatî serê me were serê te û gelê te jî. Naxwe bi wî re nepeyive û li wî guhdariya tiştekî neke!

Tufeyl, vê bûyerê wiha radigihîne: Ez bi Xwedê sond dixwim ku wan ez her jê tirsandim, paşîkê min biryara xwe da ku ez lê hîç guhdarî nekim û pê re xeber nedim; ji loma min pembû xiste guhê xwe û sibehê ez çûm mizgeftê. Min dît ku wa ye Pêxember (s.) şipiya ye û li nik Kabeyê nimêj dike. Ez nêzî wî sekinîm û min xwe negirt. Xwedê xwestibû ku her li min hin gotinên wî bide guhdarîkirin. Bi rastî min li gotineke rind guhdarî kir. Vêca min di dilê xwe de ji xwe re got: Xwedê tu hişto! Qey ne rast e. Ji xwe tu şair î, zilamekî şareza û jîr î. Tu gotinên xerab û rind ji hev vediqetînî. Çima tu lê guhdarî nakî? Heke ya ku ew pê hatiye şandin tiştekî rind be, tu yê qebûl bikî û heger ne rind be, tê dev jê berdî û xwe pê negirî.

Tufeyl, çû mala Pêxember (s.) qiseya xwe jê re ragihand. Vêca Pêxemberî (s.) jî îslam rapêşî wî kir û Qur'an jê re xwend. Loma ew jî Misilman bû. Ew vegeriya nava gelê xwe û ew gazî Îslamê kirin. Tufeyl, qebûl nekir ku bi malbata xwe re bimîne û têkoşiya. Paşîkê ew giş Misilman bûn û Dewsî giş gazî Îslamê kirin û Îslam li nava wan belav bû.

## Pêxember ji Mekkeye diçe Taîfê, li wê derê rastî janê tê

Çi dema Ebûtalib mir, Pêxember (s.) eziyeteke welê dijwar ji Qureyşiyan dît ku Ebûtalib li heyatê bûya hîç ne mumkin bû wê bidîta. Qureyşî ew qas ser xwe ve çûn heta ku eqilsivikekî wan ax avêt ser serê wî. Çi dema Qureyşiyan eziyeta xwe li wî tûj û dijwar kirin û berê xwe ji îslamê vegerandin û bi ber Îslamê ve

qet nehatin. Pêxember (s.) derkete Taîfê. Ji Seqîfiyan çavnêriya arîkariyê dikir û hêviya wî jî hebû ku ew Misilman bibin.

Çi dema Pêxember (s.) hat Taîfê. Qesda çend giregir û malmezinên Seqîfiyan kir, li cem wan rûnişt û ew gazî dînê Xwedê kirin. Wan bersiveke ewqas tehl û nexweş danê ku tinaz û qerfê xwe pê kirin û eqilsivik û koleyên xwe berdanê; dijûn jê re dikirin, qîr didanê û kevir diavêtinê. Vêca wî xwe da ber siya darexurmeyekê û bi dilekî kul û xemgîn li berê rûnişt. Bi rastî eziyeta ku li Taîfê dîtî ji ya ku ji Qureyşiyan dîtî hê dijwartir bû. Xelkê Taîfê li ser rêya wî rûniştibûn û bûbûn du alî. Vêca ku di ber wan re bihurî çiqas lingekî xwe hildida ji bo gava xwe bavêje, hê lingê xwe nedanî erdê kevirek lê didan. Paşîkê xwîn jê rijandin. Pêxember (s.) bi dil û zimanê xwe duayek wisan kir ku tê de giliyê qelsî û nekariya xwe û rebeniya xwe li hemberî xelkê ji Xwedê re kir. Dîsa bi piştgirî û arîkariya Xwedê xwe avête ber penaha wî. Duayê wî jî ev e:

“Xwedayê min! Ez giliyê bêçareyiya xwe, nekariya xwe û rebeniya xwe ya li hemberî xelkê ji te re dikim. Hey dilovînê dilovanan! Tu yî Xwedayê bindestan, tu yî Xwedayê min, tê min bispêrî kê? Qey tu yê min bispêrî nemirovên ku êrîşî min bikin, yan jî tu yê min bispêrî dijminan? Emrê min her di destê te de ye. Heger tu li min neyê xezabê, ezê gazinan nekim. Lêbelê afiyeta te ji bo min ferahtir e. Ez xwe davêjim ber nûra rûyê te ku te pê tarîtî rohnî kiriye. Li ser wê te kar û barê cîhanê û axretê rast û tekûz kiriye ku tu xezaba xwe li min nebarînî û tu ji min nexeyidî. Ez xwe davêjim ber penaha te heta ku tu ji min qayil bibî û ji bil te tu hêz û karîna min tuneye.”

Vêca Xwedê milyaketê çiyayan şand cemê û ji wî destûr xwest da ku her du çiyayên ku Taîf di neqaba wan de bû li wan bîne hev. Lêbelê Pêxember (s.) jê re wiha got: Na, vê neke! Lewra ez hêvîdar im ku ji pişta wan hin mirov bêne der ku ew îbadeta Xwedê bi tenê bikin û tiştekî nekin hevparê wî.

Çi dema Utbe û Şeybe kurên Rebîe ev rewş dîtin. Wijdanê wan lebitî. Vêca gazî xulamê xwe yê Fileh Eddas kirin û jê re

gotin: Rahêje weşiyek tirî, bixe vê sepedê, ji vî zilamî re bibe, bila bixwe. Eddas bi ya wan kir, jê re bir û ji ber gotina ku ji Pêxember (s.) bihîst û exlaqê ku ji wî dît Misilman bû.

Pêxember (s.) ji Taîfê derket û berê xwe da Mekkeyê. Vêca neyartî, dijîtî, tinaz û qerfên xelkê Mekkeyê li hemberî wî hê dijwartir bûbûn.

### Îsra û Mîrac, ferzbûna nimêjan

Piştre Xwedê bi şev Pêxemberê xwe (s.) bire Mizgefta Heramê, ji wê bire mizgefta Eqsayê û ji wê jî bire heya miqdarê xwest nêzîkî xwe kir, li asîmanan gerand, nîşan rêyî wî dan û bi Pêxemberan re da civandin:

*"Çavê wî şaş nebûye û ji xwe neçûye. Bêguman wî nîşanên Xwedayê xwe yên herî mezin dîtin."* (Necim 17-18) Îsra û Mîrac, mêvantiyeke bi rûmet bû ji rexê Xwedê ve sebiranîn bû ji bo Pêxember (s.). Li hemberî wê êş û rebeniyaku li Taîfê tûşî wê hatibû bêhnfirehiyek bû.

Çi dema li Pêxember (s.) bû sibeh û wî nûçe ji wan re ragihand, ew qebûl û bawer nekirin, sosret û mezin dêriyan, derewandin û henekên xwe pê kirin. Lêbelê Ebûbekir got: Wellahî heke wî gotibe, ew rast dibêje, ji wê çi we dixe sosretê? Wellahî eger ew ji min re ragihîne ku di kêliyekê de nûçe jê re çi bi şev û çi bi roj ji asîmanan tê erdê, ezê bawer bikim û rast bidêrim. Ev ji tiştên ku we bixe sosretê gelekî dûr e.

Xwedê di her rojê de pêncî nimêj li ser wî û ummeta wî danî/ferz kir. Pêxember (s.) jî her ji wî kêmkirina wan dixwest heya di her şev û rojê de, ew daxistin pênc nimêjan. Kî wan bawer bike, xelata xwe li cem Xwedê bijmêre, wan bîne cih, jê re bi qasî xêra pêncî nimêjî heye.

### Pêxember xwe ji êlên Ereban re rapêş dike

Pêxember (s.) dest bi erka xwe kir, di mewsimên Hecê de xwe rapêşî qabîleyên Ereban kir, ew vexwendin Îslamê û bang li wan kir ku ew nehêlin êrîş werin wî. Ji wan re digot:

– Hey filankes! Ez Pêxemberê Xwedê me, ji we re hatime şandin, fermana we dikim ku hûn îbadetê Xwedê tenê bikin û tiştekî jê re nekin hevpar, dev ji îbadeta van pûtan berdin, ewên ku hûn di şûna Xwedê de îbadeta wan dikin, bawerî bi Xwedê bînin û nehêlin êrîş bêne min, heta ya ku Xwedê ez pê şandime ez ji we re eşkere bikim.

Çi dema Pêxember (s.) gotina xwe timam kir, Ebûleheb rabû ser xwe û got:

– Hey filankes! Ev we vedixwîne vê ku; hûn Lat û Uzza ji stûyê xwe bavêjin û hûn dest ji hevkarên xwe yên cin berdin û hûn bid'et û rêşaşiya ku ew pê hatiye, qebûl bikin. Naxwe hûn bi ya wî nekin û guhên xwe nedinê.

## Destpêka Misilmanbûna Ensariyan

Pêxember (s.) di mewsimê hecê de derdikete diçû cem xerîban ku ew li cem Eqebeyê bûn, ji Ensariyan çavê wî bi çend zilamên Xezrecî ket, ew vexwendin dînê Xwedê, Îslam ji wan re pêşkêş kir û hin ayetên Qur'anê ji wan re xwendin.

Ew cîranên Cihûyan bûn, ji wan bihîstibûn ku zemanê hatina pêxemberekî nêzîk bûye. Vêca wan ji hev re got: Hevalno! Wellahî hûn dizanin ev ew pêxember e ku cihû bi wî gefa li we dixwin, naxwe bila ew berî we negihinê. Vêca wan bersiva wî dan, pê bawerî anîn û gotinê: Dema ku me gelê xwe hişt û em hatin, xelkekî ku bi qasî wî di nava xwe de neyarên hev bin tuneye. Belkî Xwedê bi te wan bigihîne hev, vêca emê biçin nav wan û emê wan vexwînin dînê te, emê vî dînê te yê ku me qebûlkirî ji wan re jî pêşkêş bikin. Eger wan bersiva me dan û Xwedê bi te ew gihandin hev, tu kes dê ji te xurttir nebe.

Berê xwe dane Medîneyê û vegeriyan welatê xwe, îman anîn û baweriya xwe bi Pêxember (s.) anîn. Çi dema hatin Medîneyê, ji birayên xwe re behsa Pêxember (s.) kirin, ew gazî îslamê kirin heya Misilmanetî li nava wan belav bû û di mala her Ensariyekî de hemin dabaşa Pêxember (s.) hate kirin.

### Peymana yekem ya Eqebeyê

Gava sal qulibî, diwazdeh zilamên ensarî hatin mewsimê hecê, Pêxember (s.) dîtin û li 'Eqebeya yekem peyman dane Pêxember (s.) ku Xwedê yek bidêrin, diziyê nekin, xwe ji zînayê dûr bigirin, zarokan nekujin û di qenciyê de bi ya wî bikin.

Çi dema millet xwestin vegerin welatê xwe, Pêxember (s.) Mûseb kurê Umeyr jî bi wan re hinart û ferman da wî ku ew Qur'anê ji wan re bixwîne, îslamê hînî wan bike û dîn şanî wan bide. Vêca li Medîneyê navê wî bi "Xwendewar" derketibû, ew bû mêvanê Es'ed kurê Zurare û li pêşiya wan nimêj dikir.

### Belavbûna Îslamê li Medîneyê

Îslam, li malên Ensariyan: Ewsî û Xezreciyan belav bû, Se'd kurê Mu'az û Useyd kurê Hudeyr bi hîkmet û hostayiya Misilmanên berî wan Misilman bûyîn û bi doza hostayane ya Mûseb kurê Umeyr Misilman bûn. Ew herdu mezinên gelê xwe mala Ebdûleşhel ji Ewsiyan bûn, Mala Ebdûleşhel giş Misilman bûn û di her maleke Ensariyan de hemin jin û mêrine Misilman çêbûn.

### Peymana duyem ya Eqebeyê

Mûseb kurê Umeyr sala duduyan vegeriya Mekkeyê. Çend Misilmanên ensarî jî digel milletê xwe yên pûtperest derketin heya gihaştin Mekkeyê, li 'Eqebeyê civan dane Pêxember (s.) Çi dema ji hecê vala bûn sêyeka şevê bihurî li cem 'Eqebeyê li devê rê kom bûn. Ew heftê û sê mêr û du jin bûn, Pêxember (s.) jî digel apê xwe Ebbas kurê Ebdulmuttelib hat, ew wê rojê li ser ola qewmê xwe bû; hê Misilman nebûbû.

Resûlullah (s.) bi wan re peyivî. Qur'an ji wan re xwend. Ew vexwendin dînê Xwedê û ji bo Misilman bibin nav li wan da. Piştre gote wan: Ez peymana vê bi we re dikim ku hûn be-

revaniya min bikin eynî mîna ku hûn berevaniya jin û zaroyên xwe dikin. Vêca wan jî peyman danê û soz jê stendin ku ew jî wan bi tenê nehêle û li gelê xwe venegere. Pêxember (s.) jî ew peyman da wan û ji wan re got: Ez ji we me, hûn jî ji min in; hûn şerê kê bikin ezê jî şerê wî bikim, hûn bi kê re aş bibin ez ê jî pê re aş bibim.

Vêca pêxemberê Xwedê (s.) ji navbera wan diwazdeh çavdêr bijartin; neh ji Xezreciyan û sê ji Ewsiyan.

### Destûra hîcretê ya Medîneyê

Çi dema Pêxember (s.) peymana arîkariya Îslamê û peyrewên xwe bi vê êla ensarî re kir, hin Misilmanan xwe li wan girt. Pêxemberê Xwedê (s.) jî ferman da hevalên xwe yên ku li Mekkeyê bûn da ku biçine Medîneyê û bighêne birayên xwe yên Misilm..n. Wî (s.) ji wan re wiha got: Bêguman Xwedê ji we re hin bira û welatekî ku hûn lê ewle bibin çêkiriye. Naxwe bir bi bir herin wê derê.

Pêxemberê Xwedê (s.) li Mekkeyê ma û ji Xwedê çavnêriya destûra derketina ji Mekkeyê û çûna Medîneyê dikir.

Hîcreta Misilmanan ji Mekkeyê ne wisa hêsan û rehet bû ku Qureyşî wê bibihîzin û li xweşiya wan here. Belkî wan asteng datanîn rêya wan ya navbera Mekkeyê û Medîneyê, îşkenceyên cûr bi cûr didan muhaciran. Muhacir dîsa ji ramanê xwe venedigeriyan û mayina li Mekkeyê tercîh nedikirin. Vêca heta hin ji wan hebûn ku naçar diman jin û zorakên xwe li wirê bihêlin û bi tenê dest bi rêwîtiya Medîneyê bikin. Mîna Ebû Seleme kirî. Hin ji wan naçar diman ku dest ji qezenca xwe û malê xwe yê ku di jiyana xwe de dayî hev berdin. Mîna ku Suheyb kirî.

Umer kurê Xettab, Telhe, Hemze, Yezîd kurê Harîse, Ebdurrahman kurê ‘Ewf, Zubeyr kurê ‘Ewwam, Ebû Huzeyfe, Usman kurê Effan û gelekên din jî -Xwedê ji wan razî be- Êdî hîcretê peyapey dom kir. Li Mekkeyê bi Pêxemberî(s.) re ji bilî Elî, Ebûbekir û hinekên ku dihatin girtin û îşkencekirin tu kes nema.

**Kompolya dawîn ya Qureyşiyan li hemberî Pêxember û hêvîşikestina wan**

Çi dema Qureyşiyan dît ku wa ye heval û hevkarên Pêxember (s.) li Medîneyê jî çêbûn, tu desthilatiya wan jî li ser wan nebû, tirsiyan ku pêxemberê Xwedê (s.) jî here wê derê. Wan baş dizanîn ku ew biçe wê derê, ew dê nikaribin tiştekî pê bikin. Vêca li Darun-Nedweyê gihan hev. Darun-Nedwe; mala Qusey kurê Kîlab bû. Qureyşiyan temamê biryarên xwe tê de didan. Di bara pêxemberê Xwedê (s.) de jî giregirên Qureyşiyan lê civiyan û bi hev şêwirîn. Dawî biryar dan ku ji her êlekê xortekî dilawer û zadegan bigrin û bi hev re- mîna zilamekîêrîşî pêxemberê Xwedê (s.) bikin; wî bikujin. Bi vî awayî, xwîna wî dê li navbera hemû êlan belav bibe, êdî mala Ebdulmenaf dê nikaribin şerê gelê xwe gişî bikin û li ser vê biryarê ji hev belav bûn.

Xwedê, ev komplo ji pêxemberê xwe re ragihand. Vêca Pêxember (s.) ferman da Elî ku ew li nav nîvînê wî razê, ebayê wî bi ser xwe de bike û jê re got: Tiştekî ku tu naxwazî dê neyê serê te.

Êrîşkar, li ber derî bûn, kara êrîşê dikirin. Pêxemberê Xwedê (s.) ji mala xwe derket, rahişte kulmek axê û Xwedê perde avête ser çavên wan, êdî wan ew nedît. Wî (s.) jî ax avêt ser serê wan û Sûretê Yasînê ji destpêkê heyanî ayeta: *"Me perde da ber çavên wan; ew wî nabînin."* (Yasîn: 9) dixwend.

Yek hat û ji wan re got:

– Hûn li benda çi ne? Gotin:

– Em li benda Mûhemmed in. Ji wan re got:

Xwedê we nehêle, ew derket û giha pêdiviya xwe jî.

Li hundir nêrîn, dîtin ku wa ye, yek di nava nivîn de raketî ye, hîç neketin gumanê ku ew ne Pêxember (s.) be. Çi dema bû sibeh, Elî ji nav ciyan rabû, vêca wan ji xwe fehêt kir û bi hêviyeke şikestî vegeriyan.

## Hîcreta Pêxember ya Medîneyê

Pêxemberê Xwedê (s.) çû mala Ebûbekir û jê re got:

– Xwedê destûra min daye ku ez derkevim û hîcret bikim. Ebûbekir jê re got:

– Hey qasidê Xwedê! Ez jî bi te re werim? Gotê:

– Tu jî bi min re were.

Ebûbekir ji kêfan giriya, du lokên (devehên nêr) karwaniyê anîn ku ew ji vê rêwîtiyê re amede kiribûn. Heqdestê Ebdullah kurê Ureyqit dayê da ku rê nîşanê wan bide. Pêxemberê Xwedê (s.) jî ferman da Elî ji bo di şûna wî de li Mekkeyê bimîne, heta wan sipareyên ku li cem pêxemberê Xwedê (s.) bûn bide xwediyên wan. Lewra; li cem kê tiştek hebûna û jê bitirsiya ku tiştek dê lê biqewime, ji ber rastî, duristî û ewleyiya Pêxember (s.) li Mekkeyê, radibû ew datanî cem wî.

## Li Şikefta Sewrê

Pêxemberê Xwedê (s.) û Ebûbekir (r.) ji Mekkeyê bi dizîka derketin. Ebûbekir (r.) ferman da kurê xwe Ebdullah ku li xelkê guhdarî bike ka ew di bara herduyan de çi dibêjin û were ji wan re ragihîne. Emr li koleyê xwe Amir kurê Fuheyre kir ku bi roj biçe ber pez û bi şevê bi ser wan de were. Esmaya keça Ebûbekir (r.) jî ji wan re xwarina wan dianî.

Herduyan qesda şikefta Çiyayê Sewrê kir, Ebûbekir berî Pêxember (s.) çû li nava şikeftê geriya. Lewra ditirsiya ku tiştek tê de hebe û zerarê bide Pêxember(s.) û dûvre bang kirê.

Ew welê li şikeftê bûn ji nişka ve Xwedê pîrik şand wê jî tevna xwe di navbera şikeftê û dara ku çiqilê wê xwe berdayî ser devê şikeftê de honand. Bi vî awayî, wê Pêxember (s.) û Ebûbekir (r.) ji ber kafiran veşartin. Xwedê ferman da du kevokên sil û berî wan jî perên xwe dilivandin heya ketin navbera şikeftê û darê: *"Leşkerên asîmanan û erdê yên Xwedê nin. Bêguman Xwedê zana û xwedî-hîkmet e."* (Fetîh: 4)

Kafiran da pey dewsên Pêxember (s.) û ew teqîb kirin heya gihan çiya, şopa wî winda kirin, hilgeriyan serê çiya di ber şikeftê re bihurîn, tevna pîrê li ser deriyê wê dîtin. Vêca gotin: Heger yek çûbaya virê dê tevna pîrê li ser deriyê wê nebûya.

### Xemgîn nebe Xwedê bi me re ye

Di dema herdu li şikeftê bûn, Ebûbekir (r.) dewsên pûtperestan didît û digotê:

– Hey qasidê Xwedê! Heger yek ji wan lingê xwe rake û binêre dê me bibîne!

– Ma gumana te, di bara duduyên ku Xwedê sisiyê wan be, de çi ye?!

Di bara vê babetê de Qur'ana pîroz dibêje: *"Duduyê duduyan dema li şikeftê bûn gava ji hevalê xwe re digot: Xemgin nebe! Xwedê digel me ye."* (Tewbe: 40)

### Siwarbûna Sureqa li pey şopa Pêxember û ya ku hate sere wî

Qureyşiyan dema Pêxember (s.) ji dest xwe berdan, sed deve (wek xelat) dane yê ku ji wan re bigre û li wan vegerîne. Pêxember (s.) û Ebûbekir (r.) tam sê şevan li şikeftê man. Piştre herdu digel Amir kurê Fuheyre û rêberekî pûtperest -ku Pêxember (s.) ew bi heqdestî girtibû- çûn. Wî rêberê pûtperest ew di rêya sahilê de dibirin.

Temakariyê bi Sureqa kurê Malikê kurê Cûş'em girt ku ew bikeve pey şopa Pêxember (s.) wî li Qureyşiyan vegerîne û sedlokên xwe bigre. Vêca wî xwe avête ser pişta hespê xwe da ku bikeve ser şopa Pêxember (s.) hespê wî şemitî û ew jî kete erdê, dîsa kir bikeve pey şopa wî (s.) li hesp siwar bû, hespê wî cara duduyan şemitî û ew jê kete erdê, dîsa kir bikeve pey şopa Pêxember (s.) xwe avête ser pişta hesp, çav bi wan ket, ew dîtin, cara sisêyan hespê wî şemitî, destê wî di erdê de çû xwar, ji hespê ket û bahoz û bablîsokê da pey wan.

Dema Sureqa ev dît, fêm kir ku ew pêxemberê Xwedê (s.) ye, di binê parastina Xwedê de ye, hemin ew dê bi ser bikeve. Vêca gazî Pêxember (s.) û yên ku pê re bûn kir û wiha got: Ez Sureqayê kurê Cûş'em im, li benda min bisekinin, ez dê bi we re biaxivim, wellahî ji min tiştekî ku hûn naxwazin dê neyê we. Pêxember (s.) ji Ebûbekir (r.) re got: Jê re bibêje: Ew çi ji me dixwaze? Sureqa gotê: Ez dixwazim tu nameyekê binivisî ji min re ku ew di navbera min û te de bibe nîşan. Vêca Amir kurê Fuheyre jê re nameyek li ser hestiyekî yan jî çermekî nivîsî.

### Çekên Kîsra di destê Sureqa de

Pêxember (s.) ji Sureqa re got: "Çawa dibe li te dema tu çekên Kîsra wergirî?" Eynî wisan bû jî. Dema çekên Kîsra kember û taca wî anîn cem Umer (r.) gazî Sureqa kurê Malik kir û ew lê kirin. Sureqa, ji Pêxember (s.) re xwarin teklîf kir, lê qebûl nekir û tenê gotê: "Ji ber me winda bibe."

### Zilamekî mubarek

Ew di rêbiwara xwe de di ber Ummu Me'beda Xuza'î re derbas bûn, li cemê bizinek hebû, ji nekarî mabû li malê. Vêca Pêxember (s.) bi destên xwe guhanê wê vemeliya, navê Xwedê got, dua kir, guhanê wê tije şîr bûn. Ummu Me'bedê ew doht, têr jê vexwar û hevalên wî jî têr vexwarin. Careke dî jî têr jê vexwarin.

Piştre dîsa doht heya sîtil jê tije bû. Dema mêrê wê Ebû Me'bed vegeriya malê, mesele jê pirs kir, jê re got: Na! Wellahî zilamekî mubarek di ber me re bihurî, wiha û wiha bû. Ew bi awayekî rind wesifand. Jê re got: Hebe, nebe ew mirovê Qureyşiyan e ku lê digerin.

Rêberê wan li pêşiya wan meşiya heya ew birin Qubayê. Ev cihek li Medîneyê ye. Ew jî di diwazdehê meha Rebî'ul ewelê roja duşemê de bû. Ew bû destpêka tarîxa Îslamê.

# LI MEDÎNEYÊ

## Medîneyê Pêxember çawa pêşwazî kir

Ensariyan bihîstibû ku Pêxember (s.) ji Mekkeyê derketiye. Wan jî bi heweseke welê bêsebir çavnêriya wî dikir ku ji çavnêriya rojîgiriya dîtina heyvê ya cejnê hê zêdetir bû. Wan dema nimêja fecrê dikir her roj derdiketin derveyê Medîneyê û çavnêriya Pêxember (s.) dikirin. Hetanî ku roj li wan sincirîbana û ew mecbûrî ber sihê bikirana çavnêriya wî dikirin. Vêca jê û pê de vedigeriyan mala xwe. Lewra hîcret di heyama kele-çiqçiqa havînê de bû.

Di çaxê ku her kes kete xaniyê xwe, Pêxember (s.) hate Medîneyê. Cihûyan dizanî ku dê ensarî çi bikin. Yê ku pêşî Pêxember (s.) dît, zilamekî Cihû bû. Vêca wî bi dengekî bilind kire qîr û gazî; ji Ensariyan re ragihand ku Pêxember (s.) hate Medîneyê. Ensarî, derketin pêşwaziya wî, ew û Ebûbekirê (r.) hevtemenê xwe li bin siya dareke xurmeyê bûn, piraniya Ensariyan berî vê carê ew nedîtibûn. Di navbera xelkê de îzdîham pêk hat û gelekan ji wan ew û Ebûbekir (r.) ji hev nas nedikirin. Ebûbekir ev yek fêhm kir û rabû bi ebayê xwe sih jê re çêkir. Vêca bi vî awayî, ji xelkê re mesele diyar bû.

Misilmanan, ji kêfa hatina Pêxember (s.) tekbîr dan. Di jiyana wan de bi qasî ku kêfa wan ji bo hatina Pêxember (s.) hatî ji tu tiştekî dî re ew qasî nehatibû. Pîrek, zarok û qerwaşên wan digotin, va ye Pêxember hat! Vaye Pêxember hat!

Keçikên Ensariyan bi kêf û şewq ev sirûd dixwendin:

*Ji seniyetul weda'ê roj li ser me hilat*

*Heta bangkerek bang bike Xwedê, spasî her li me pêdivî ye.*

*Hey şandeyê ku ji me re hatî şandin! Tu li ser seran û çavan hatî.*

Enes kurê Malik (r.) ku wê rojê zarok bû dibêjê: Min Pêxember (s.) roja ku hate Medîneyê dît, min hîç rojeke ji wê roja ku ew hatî xweştir û ronaktir nedît.

### Mizgefta Qub'ayê, îna yekem li Medîneyê

Pêxemberê Xwedê (s.) çar rojan li Qubayê ma û li wê derê mizgeftek ava kir.

### Li mala Ebûeyyûbê Ensarî

Pêxemberê Xwedê (s.) derkete Medîneyê. Xelkê bir bi bir ew pêşwazî dikirin, jê dixwestin ku li cem wan bimîne. Bi hefsarê deveha wî digirtin. Wî (s.) ji wan re digot: "Ji rêya wê derkevin ew fermanber e." Ew yek çend caran hate dubarekirin. Paşîkê hate ber mala Benû Malik kurê Necar, vêca li cihekî mexelî ku îro ew cih bûye deriyê mizgefta Pêxember (s.) lê wê rojê ew der miştaxeya du lawikên sêwî ji mala Necaran bû. Ew jî malxalanê Pêxember (s.) bûn.

Pêxemberê Xwedê (s.) ji deveyê peya bû. Ebûeyyûb (r.) (navê wî yê eslî Xalid kurê Zeydê Necarî yê Xezrecî ye), rahişte firaxên wî, danî mala xwe û Pêxember (s.) bû mêvanê wî. Gelekî qedr û xatirê Pêxember (s.) girt, dakete qatê binî û nexwest li qatê ser Pêxember (s.) bimîne. Vêca Pêxember (s.) jê re got: "Hey Ebûeyyûb! Hem ji me re, hem ji yên derdora me re ya herî baş ew e ku em li qatê binî bimînin."

### Avakirina mizgeftê û xaniyê Pêxember

Pêxemberê Xwedê (s.) gazî herdu lawikên sêwî kir, bi wan re bazar kir da ku bike mizgeft. Wan gotinê: Hey qasidê Xwedê! Em nafiroşin, em wilo (bêpere) bidin te. Pêxember (s.) ji wan -wek xêr- qebûl nekir, ji wan kirrî û piştre mizgeft tê de lê kir. Pêxemberê Xwedê (s.) bi xwe di avakirina mizgeftê de dixebitî, radihişte kerpîçan û dianî. Misilmanan jî çav lêkirin. Pêxemberê Xwedê (s.) digot:

*"Xwedayê min! Xêr, xêra axretê ye. Rehma xwe li mihacir û Ensariyan bike."*

Misilman jî gelek bextiyar û dilşad bûn, şiîr digotin û hemdê Xwedê dikirin.

Pêxemberê Xwedê (s.) heft mehan li mala Ebûeyyûb (s.) ma. Heta mizgeft û xaniyê xwe ava kir û çû li mala xwe bi cih bû. Mihaciran jî xwe li Pêxemberê Xwedê (s.) girtin. Êdî li Mekkeyê ji bilî girtî û qelsan tu kes nema. Li her maleke Ensariyan hemin xelkê wê tev Misilman bûn.

### Hevbiratiya mihacir û Ensariyan

Pêxemberê Xwedê (s.) hevbiratiya mihacir û Ensariyan li ser bingeha wekheviyê danî. Ensariyan bi hev re di biratiya mihaciran de pêşbazî dikir; mihaciran tenê bi qur'ekişandinê bi dest hev ve berdidan. Ensariyan ew di xaniyên xwe de, di sermiyan, zevî û terşên xwe de serbest dikirin û ew di ser xwe re digirtin.

Yê ensarî ji yê mihacir re digot: Li min binêre, va ye nîvê malê min ji te re. Yê mihacir jî jê re digot: Bereketa Xwedê li te, li ehlê te be. Sûkê nîşanî min bide. Ji Ensariyan diserxwere girtin hebû û ji mihaciran jî îzzeta nefsê û çavneberdana malê tu kesî hebû.

### Name nivîsandina Pêxember di navbera muhacir û Ensariyan de u peymandanîna bi Cihûyan re

Pêxemberê Xwedê (s.) di navbera mihacir û Ensariyan de nameyek nivîsand û tê de soz û peyman da Cihûyan jî. Ew li ser dînê wan hiştin, dest nedan malên wan û şertin li ser wan danîn.

### Danîna banga şerîf (azan)

Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) li Medîneyê tam aram bû; piyê wî cihê xwe girt û rewşa Misilmantiyê serrast û tekûz bû.

Xelk ji bo nimêjê bêyî bang li dora wî diciviyan, pêxemberê Xwedê (s.) hez nedikir ji bo bangewaziya nimêjê rê û metodên ku adetên Cihû û Filehan bûn; mîna naqos, agir û bewqê bi kar bîne.

Xwedê azan ji Misilmanan re bexişand; ew anî xewna hinan ji wan. Pêxemberê Xwedê (s.) jî ew qebûl kir û ji Misilmanan re danî û Bilal kurê Rebah yê Hebeşî ji bo banga şerîf bijart. Ew bû muezzin û bangxwênê pêxemberê Xwedê (s.) û heta qiyametê bû îmam û rêberê muezzinan.

### Xuyabûna munafiqan li Medîneyê

Îslam li Medîneyê belav dibû, hin xaxam û alimên Cihûyan yên mîna Ebdullah kurê Selam Misilman bûn. Çavnebarî kete dilên Cihû û yên ku serokatî xeyala wan bû, dîsa xeyal dikirin ku ew dê ew fermanan aresteyî xelkê bikin, qedexeyan li ber xelkê deynin û tu kes di serokatiya wan de lecê neke. Wek numûne; Ebdullah kurê Ubeyy kurê Selûl. Ev giş jê re pêk hatin, dema Îslam hat û xelk bir bi bir ketin Îslamê. Vêca çavnebarî kir. Çiqas yekî ku di qelbê wî de nexweşî, zendîqî, serokatî, temakarî yan jî armancek heyî neyartiya wê kirin. Ji wan hin dijminên eşkere bûn û hin jî munafiq/zendîq bûn.

### Veguhastina qibleyê

Pêxemberê Xwedê (s.) û Misilmanan dema nimêj dikirin, berê xwe didan qibleya Beytul-Meqdesê û piştî hatin Medîneyê jî tam şeş mehan li ser vê yekê dom kirin. Pêxemberê Xwedê (s.) hez dikir berê xwe ji Beytul-Meqdesê vegerîne û bide Kabeyê. Ji xwe Misilmanên Ereb jî bi şîrê hezkirin û mezindêrîna Kabeyê xwedî û mezin bûbûn. Ev ketibû nava xwîn û goştê wan. Ew bi maleke dî venediguhastin û qibleya Îbrahîm û Îsmaîl bi qibleyeke dî nedidan. Wan hez dikir berê xwe bidin Kabeyê. Di qible-girtina Beytul-Meqdesê de azar û jan digiha Misilmanan. Lêbelê wan digot: *"Me bihîst û bi ya*

*wê kir."* (Beqere: 285) Dîsa digotin: *"Me îman pê anî, tev ji cem Xwedayê me ye."* (Alî 'Îmran: 7)

Wan xwe hînî îta'eta Resûlullah (s.) û xwenizimkirina ji fermanên Xwedê re kiribûn. Çi li xweşiya wan biçûna, çi neçûna, çi minasibî hewes û adetên wan bûna û çi jî nebûna.

Çi dema Xwedê dilên wan ji bo Xwedaparêziyê û radestbûna wan ji bo fermanên Xwedê imtîhan kir, berê pêxemberê xwe û Misilmanan ji Beytul-Meqdesê veguhaste Kabeyê. Qur'ana Kerîm jî di vê babetê de wiha dibêje:

*"Herwiha me hûn kirin ummeteke navîngir da ku hûn li ser mirovan bibin şahid û Pêxember jî li ser we bibe şahid. Me ev qibleya ku vêga te berê xwe dayê, kire qible, da ku em bizanin ka kî dê bide pey Pêxember û kî dê bi ser pehniya xwe ve (ji dîn) vegere. Çendî ku ev berguherandin zehmet be jî; lêbelê ji bo yên ku Xwedê rêya rast nîşanî wan daye ne zehmet e."* (Beqere: 143)

Misilmanan bi ya Xwedê û Pêxemberê wî kirin, berê xwe dane Kabeyê û ew bû qibleya Misilmanan heta qiyametê; ew li ku bin berê xwe didin rexê wê.

### Xwetûjkirina Qureyşiyan li hemberî Misilmanên li Medîneyê

Dema Îslam li Medîneyê tam bi cih û xurt bû. Qureyşiyan fêhm kir ku ew bi pêş ve diçe; geş û gur dibe, her roj ew belav û hê xurttir dibe. Ha li vê derê, Qureyşiyan daw û devlingên xwe yên dijminatî û cengê li hemberî Misilmanan hildan û xwe tûj kirin. Xwedê jî fermana sebirkêşiyê, lêborînê û şernexwestinê dida wan û ji wan re digot: *"Destê xwe bi xwe bigrin û nimêjê bikin."* (Nîsa: 77)

### Destûra şer

Çi dema stirî xurt bû, per pir dijwar bû, Xwedê destûra şer da Misilmanan û bi ferzîtî li ser wan nedanî. Belkî gote

wan: *"Ji bo yên ku neheqî li wan bûye û şerê wan hatiye kirin destûr hatiye dayîn; bêguman Xwedê li ser arîkariya wan kare ye."* (Hec: 39)

### Cerd û xezweya Ebwayê

Pêxemberê Xwedê (s.) da xwe, cerd û pêşajo ji hin êl û herêman şandin, piraniya caran şer û herb nediqewimî, tenê lihevxistin pêk dihat. Wê jî saw û tirs dixist dilê pûtperestan û hêza Misilmanan nîşan dida.

Pêxemberê Xwedê (s.) bi xwe çû xezweya Ebweyê û ew bû xezweya yekem ku Pêxember (s.) bi xwe çûyiyê û şer û cerd piştî wê peyapey rûdan.

### Rojiya meha Remezanê ferz bû

Rojiya meha Remezanê di sala duyem a hîcretê de ferz bû. Xwedê ev ayeta ha şand: *"Gelî yên ku bawerî aniye! Rojî li ser we hatiye ferzkirin, çawa li ser yên beriya we jî ferz bûbû, da ku hemin hûn xwe biparêzin."* (Beqere: 183) Di ayeteke din de jî gotiye: *"Meha Remezanê ew e ku tê de Qur'an hatiye xwarê ku ayetên wê ji bo mirovan rêber in û ji bo cudakirina heqî ji batilî delîlên eşkere ne."* (Beqere: 185)

### Cenga Bedrê ya cudaker

Xezweya Bedrê ya mezin di sala duyemê hîcretê, meha Remezanê de rû da. Xwedê navê "Roja Cudakirinê" li vê cengê kir: *"Heke bera we îman bi Xwedê û ya ku me ji bendeyê xwe re, di roja cudakar de şandiye; roja herdu civat hatin hemberê hev, aniye."* (Enfal: 41)

Vê cengê wiha rû da: Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku Ebûsufyan kurê Herb ji Şamê vedigere û kerwanekî mezin pê re ye, bazirganî û malên Qureyşiyan di navê de ye, şer di nava Misilman û pûtperestên Qureyşiyan de dom dikir. Qureyşiyan

hemû mal û derfetên xwe seferber kiribûn ji bo şerê Îslamê û qelskirina Misilmanan çeteyên wan pir caran digihane sînor û çêriya Medîneyê.

Çi dema Pêxemberê Xwedê (s.) bihîst ku Ebûsufyan ji Şamê vedigere û li ser serê vî kerwanî ye, hem jî ew di biwara Îslamê de zilamekî pir dijwar bû. Pêxemberê Xwedê (s.) nav li xelkê da ji bo derkevin pêşiya wan û ji bo wê haziriyeke zêde nekir. Lewra armanc çûna pêşiya kerwan bû ne çûna şer bû.

Ebûsufyan bihîst ku Pêxemberê Xwedê (s.) derketiye pêşiya wî û qesda wî dike, hewara xwe gihand Qureyşiyan da ku wî ji Misilmanan biparêzin. Dema hawar giha Qureyşiyan, xwe ji cengê re kar kirin, bi lez rabûn û ji bilî Ebûleheb hemû giregirên Qureyşiyan beşdar bûn. Wî jî di ber xwe de zilamek şand.

### Bersiva Ensariyan û îtaeta kûr

Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) pê hesiya ku Qureyşî derketine, bi hevalên xwe şêwirî, lê qesda wî hevkarên wî; ensarî bûn. Lewra wan peyman dabûnê ku wî li welatê xwe biparêzin. Êdî çi dema kir ku derkeve derveyê Medîneyê xwest fikra wan hîn bibe. Vêca mihacir peyivîn û qenc xeber dan. Piştre cara duduyan bi wan şêwirî. Wan jî xeber dan û rind peyivîn. Dûvre cara sisêyan jî bi wan şêwirî. Vêca ensarî têgihan ku wan destnîşan dike. Sa'd kurê Mu'az (r.) da xwe û gotê: Hey qasidê Xwedê! Wekî ku tu di ber me re diavêjî, her wekî ku tu ditirsî; ensarî parastina te li hundirê Medîneyê li ser xwe heq bibînin, ne ku li derveyê wê. Ez ji ber Ensariyan ve dibêjim û bersiva wan didim; biçe cihê ku tu bivê, bigre werîsê yê ku tu bivê, bigre ji malên me tişta ku tu bixwazî û bide me tişta ku tu bixwazî. Em bi qasî ji ya ku tu digrî hez dikin, ewqasî ji ya ku dihêlî hez nakin, kerem ke, tu çi fermanê bikî em li pey te ne. Ez bi Xwedê sond dixwim ku eger tu biçî heya Berka Xemedanê (deverek e, li aliyê Yemenê) jî emê bi te re bin! Ez bi Xwedê sond dixwim ku eger tu berê me bidî vê deryayê jî, emê xwe bi te re bavêjinê.

Miqdad jî jê re got: Em tişta ku gelê Mûsa jê re gotin, ji te re nabêjin; *"Tu û Xwedayê xwe herin şer bikin, em jî li virê rûniştî ne."* (Maîde: 24) lêbelê emê di her çar aliyên te de şer bikin. Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) ev ji wan bihîst rûyê wî geş bû û got: "Herin, mizgîn li we be!"

### Di cîhad û şehadetê de du xort pêşbaziyê dikin

Çi dema Pêxemberê Xwedê (s.) berê xwe da bedrê, lawekî şanzdeh salî hebû, navê xwe Umeyr kurê Ebû Weqqas bû, ew jî derketibû seferê, lê ditirsiya ku Pêxember (s.) wî qebûl neke. Lewra ew piçûk bû, wî xwe vedişart da ku tu kes wî nebîne. Birayê wî yê mezin; Sa'd kurê Ebûweqqas ev yek jê pirsî, gotê: Ez ditirsim ku Pêxemberê Xwedê (s.) min vegerîne û ez jî hez dikim bême der. Belkî Xwedê şîrîniya şehîdbûnê bi min bide te'mkirin. Herwiha wisa bû jî. Pêxemberê Xwedê (s.) xwest wî vegerîne. Lewra hê negihabû sewiyeya mêran. Vêca Umeyr giriya, dilê Pêxemberê Xwedê (s.) pê ve ma, destûr dayê û ew jî di şerê pîroz de şehîd bû.

### Ne beraberiya Misilman û pûtperastan di jimar û amadeyiyê de

Pêxemberê Xwedê (s.) bi lez digel sêsed û sêzdeh zilaman derket, pê re tenê du hesp û heftê deveh hebûn, du-sê zilam bi dor li devehekê siwar dibûn. Di vê yekê de giş wekhev bûn; çi serdar û çi leşker, çi peyrew û çi pêşrew. Pêxemberê Xwedê (s.) û Ebûbekir (r.) û sehabiyên mezin jî di navbera wan de bûn. Vêca wî (s.) alaya şer da Mûseb kurê Umeyr. Alaya mihaciran da Elî kurê Ebûtalib, alaya Ensariyan jî da Se'd kurê Mu'az.

Çi dema Ebûsufyan bihîst ku Misilman derketine, dakete perava deryayê û meşiya. Êdî gava dît ku va ye ew û karwanê xwe reha bûn, ji bo Qureyşiyan nameyek nivîsî û ji wan re şand: Vegerin. Lewra hûn derketine da ku karwanê xwe biparêzin û wan jî qesd kirin vegerin, lêbelê Ebûcehîl asê bû û şer xwest; jimara Qureyşiyan hezar û tiştek bû, giregir, egîd, siwar, le-

heng û qehramanên wan hazir bûn. Vêca Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Va ye Mekkeyê, kezebên xwe ji we re avêtiye."

Pêxemberê Xwedê (s.) û hevalên xwe beriya Qureyşiyan, hê nîvê şevê gihan ser avê, hewz kolan û Pêxemberê Xwedê (s.) destûr da wan pûtperestên ku hatibûn avê, ew avê vexwin.

Xwedê di wê şevê de baraneke welê barand ku bû heriyeke mezeloqî û nedihişt pûtperest bi pêş kevin werin. Ji Misilmanan re jî bû merhemet; erd dewisand, qûm û sêlh hişk kir, lingên wan saxlem kir û dilê wan sitûr û xurt kir.

*"Avekê ji we re dadixe ji bo ku we pê paqij bike, pê qirêja Şeytên ji we bibe, dilên we girêbide û pê lingên we cihgirtî bike."* (Enfal: 11)

### Kara şer

Ji Pêxemberê Xwedê (s.) re holikek li ser girekî raserî şer çêkirin. Ew li rasta şer geriya û bi destê xwe nîşan dida: Xwedê hez ke, ev cihê filankes e. Ev kuştingeha bêvankes e. Tu kes ji cihê ku Pêxember (s.) nîşandayî derbas nebû.

Çi dema pûtperest hatin û herdu grûban hev dît, Pêxember (s.) got: "Xwedayê'm! Vaye Qureyşî bi hespên xwe, bi quretiya xwe ve hatine şerê te, pêxemberê te jî diderewînin." Ew şeva înê, hivdehê Remezanê bû. Vêca dema roj hilat, Qureyşî bi çete û pêşajoyên xwe ve hatin rasta şer û herdu kom vewestiyan û bûne rêz.

### Lavelav û bergerîn

Pêxemberê Xwedê (s.) mucahid rêz kirin; vewestandin û vegeriya holika xwe- Ebûbekir jî (r.) pê re kete holikê. Pêxemberê Xwedê (s.) dikire, zarzar, laklak û hawara xwe digihand wî Xwedayê ku rawestyarê hukmê wî û vegeryarê qedera wî tune: *"Arîkar tuneye, ger ne ji cem Xwedê be."* (Enfal: 10) Dîsa digot: "Xwedayê min! Heke tu vê cema'etê ji holê rakî piştî wê li erdê, dê îbadetê te neyê kirin."

Wî (s.) her bi Xwedê re dikire gazî û digot: "Xwedayê'm! Peymana ku te dayî min bîne cih. Xwedayê'm! Arîkariya te dixwazim." Wî (s.) destên xwe ber bi asîmanan ve rakir, heta kurkê wî ji navmilê wî ket û Ebûbekir (r.) hedana wî dianî û ji ber lavelava zêde dilê wî pê ve dima.

### Ev herdu hevrik in, ji bo Xwedayê xwe pev diçin

Piştre pêxemberê Xwedê (s.) derket nava xelkê û ji bo şer nav li wan da. 'Utbe kurê Rebî'e, birayê wî Şeybe û kurê wî Welîd jî derketin. Dema gihan navbera herdu koman xwestin ku xwe ji wan re berdin meydanê. Vêca sê xortên ensarî ber bi wan ve derketin. Gotine wan: Hûn kî ne?! Gotin: Em ensarî ne. Gotine wan: Hûn ji me re berber û camêr in. Lêbelê; bila pismamên me bêne hemberê me.

Pêxember (s.) got: Hey Ubeyd kurê Haris (kurê Muttelibê kurê Ebdulmenaf) rabe! Hey Hemze! Rabe. Hey Elî! Rabe.

Gotin: Belê, hemberne camêr in. Ubeyde -ew di navbera wan de yê herî yextiyar bû- xwe beraste Utbe, Hemze daberizî Şeybe û Elî jî daberizî Welîd kurê Utbe. Hemze û Elî keys nedane hemberên xwe û di cih de ew kuştin. Lê Ubeyde û Utbe hevûdu birin û anîn û herdukan jî hevûdu birîndar kir. Hemze û Elî bi şûrên xwe, xwe çen kirin Utbe û ew kuştin, rahiştin Ubeyde, ew bi birîndarî birin û ew jî şehîd ket.

### Herdu civat bi hev ketin û şer qewimî

Herdu rex ketin nava hev û şer germ bû. Herdu rexan êrîş birin hev, nêzî hev bûn û pûtperest û Misilman gihan hev. Vêca Pêxember (s.) got: "Rabin ber bihişteke welê ku firehiya wê erd û asîman e."

### Şehîdê yekem

Umeyr kurê Hemamê Ensarî rabû, got: Hey qasidê Xwedê! Bihişteke ku firehiya wê erd û asîman e? Jê re got: "Belê." Got: Wax! Wax! Ya Resûlullah! Bes ez hêvîdar im ku bibim ji xelkê

wê. Jê re got: “Tu ji xelkên wê yî.” Wî çend xurme ji tûrikê xwe derxistin, ew dixwarin. Piştre got: Eger ez sax bimînim heta wan xurmeyan bixwim, ew jiyaneke dirêj e. Vêca ew xurmeyên xwe avêtin û şer kir. Heta hate kuştin û ew bû şehîdê yekem.

Mucahidan di çeperên xwe de sebir dikşandin, Xwedê dianîn bîra xwe û pêxemberê Xwedê (s.) şerekî dijwar dikir. Ew (s.) ji her kesî bêhtir nêzî pûtperestan bû. Wê rojê, şerê herî giran û çetîn wî (s.) kir, ferişte hatin xwarê, arîkariya mucahidan kirin, rahmet anîne ser wan û şerê pûtperastan kirin.

## Pêşbaziya birayan di bara kuştina dijminên Xwedê û pêxemberê wî de

Xortan bi hev re pêşbazî kirin ji bo bibin şehîd û bigihên bextiyariyê. Ew pêşbaziyek bû di navbera bira û hevdostan de. Ebdurrehman kurê Ewf dibêje: “Roja şerê Bedrê, ez di sefa şer de bûm, dema li xwe fitilîm min du xortên hê piçûk dîtin yek li milê rastê bû, yek jî li milê çepê bû. Her wekî li cihê xwe ne ewle bûn, yekî bi dizîka ji min re got: Apo! Ebûcehîl nîşanî min bide. Min gotê: Birazî! Tu yê çi bikî ji Ebûcehîl? Got: Min peyman daye Xwedê eger wî bibînim, yan ezê wî bikujim, yan jî ewê min bikuje. Lawikê dî jî bi dizîka ji min re got: Kêfa min nayê ku ez di navbera cihê du mêran de bim. Vêca min bi destê xwe Ebûcehîl nîşanî wan da herdu mîna du eyloyan (qertalan) xwe çeng kirinê û bi hev re lê dan.

Çi dema Ebûcehîl hate kuştin. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ev Ebûcehîl, Fir‘ewnê vê ummetê ye.”

## Serkeftina eşkere

Çi dema di dawiya şer de serkeftina Misilman û têkçûna pûtperestan eşkere bû. Pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ellahû Ekber (Xwedê ji her tiştî mezintir e) hemd ji wî Xwedayî re be ku peymana xwe anî cih, arî bendeyê xwe kir û wî bi tenê hevalbend têk birin.”

Xwedê rast gotiye: *"Bêguman Xwedê li Bedrê arî we kir, hal ev e ku hûn ne xurt bûn, naxwe ji Xwedê bitirsin, ji bo hemin hûn spasiya wî bikin."* (Alî 'Îmran: 123)

Pêxemberê Xwedê (s.) ferman da mucahidan ku kuştiyê kafiran bavêjin bîran. Li ser wan rawestiya û got: "Gelî xelkên bîran! Qey we soza ku Xwedayê we dayî we heq dît?! Min bi xwe soza ku Xwedayê min dabû min heq dît."

Di roja şerê Bedrê de heftê giregirên kafiran hatibûn kuştin. Heftê ji wan dîl jî hatibûn girtin. Ji Misilmanan jî şeş muhacir û heşt ensarî şehîd bûbûn.

Pêxemberê Xwedê (s.) dîl di navbera hevalên xwe de par ve kirin û ji wan re got: "Di bara qenciya li wan şîreta qenciyê li hev bikin."

### Qewimîna cenga Bedrê

Pêxemberê Xwedê (s.) bi serkeftinê berê xwe da Medîneyê û neyarên wî yên derdora Medîneyê tev jê tirsiyan. Pir kes ji xelkê Medîneyê Misilman bûn. Li Mekkeyê jî qîrewîr kete mala pûtperestan; ew li ser kuştiyên xwe pir giriyan û tirs kete dilên dijminan.

### Hînkirina zarokên Misilmanan û fidya dîlan

Pêxemberê Xwedê (s.) li dîlan bihurî, fidye ji wan qebûl kir û yên ku tiştek bi wan re tunebû, ew azad kirin. Qureyşiyan fidyeya êsîran şand, Misilmanan jî ew serbest berdan. Êsîrên ku tiştekî wan tunebû, Pêxemberê Xwedê (s.) fidyeya wan kire ew ku; zarokên Ensariyan hînî nivîsandinê bikin. Her yexsîrekî dê deh zarok hînî nivîsandinê bikirana. Zeyd kurê Sabit jî bi vê rê fêrî nivîsandinê bû.

Mala Qeynûqe êla Cihûyan a yekem bû ku peymana dabû pêxemberê Xwedê (s.) şikand, şerê wî kir û şkence da Misilmanan. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) panzdeh şevan hawîrdora wan girt, heta bi hukmê wî qayil bûn û daketin.

Ebdullah kurê Ubeyy kurê Selûl, serê nîfaqê, hevkarê wan mehdara wan kir, pêxemberê Xwedê (s.) ew dane wî. Ew heftsed şerker bûn û bazirgan û zêr-zîvfiroş bûn.

### Xezweya Uhudê pozbilindiya cahiliyyetê

Çi dema di roja cenga Bedrê de giregirên Qureyşiyan hatin kuştin û beremayên têkçûyiyên wan vegeriyane Mekkeyê, musîbet û karesat li wan mezin hat, zilamên ku bav, bira û kurên xwe di şer de winda kiribûn gihane hev û çûn bi Ebûsufyan û yên ku di wî karwanî de bazirganiya wan hebû re axivîn û ji wana xwestin ku vî malî di şerê Misilmanan de xerc bikin. Wan jî minasib dît û wisan kirin jî. Qureyşiyan xwe ji şerê Misilmanan re kar kirin; hozan û şairan bi şiîrên xwe nav li xelkê dan, ew anîn heyecanê, bandor li wan kirin û ew anîn xîret û pozbilindiyê.

Qureyşî bi bavik û hevalbendên xwe ji êlên din re di nîvê meha şewalê, sala sisiyê hîcretê de ji Mekkeyê derketin. Giregirên Qureyşiyan digel jinên xwe derketin, heta daketin pêşberê Medîneyê. Ray û ramana Pêxember (s.) ew bû ku Misilman li Medîneyê bimînin û dev ji wan berdin. Vêca eger Qureyşî êrîşî wan bikin, Misilman dê li Medîneyê şerê wan bikin. Pêxember (s.) hez nedikir derkeve derveyê Medîneyê. Ebdullah kurê Ubeyy jî wekî Pêxember (s.) difikirî. Lêbelê hin Misilmanên ku ji şerê bedrê mabûn gotin: Hey Resûlullah! Me derêxe hemberê neyarên me, bila ew me newêrek, bêzirav û qels nebînin.

Her li ber Pêxember (s.) dan, heta ew çû mala xwe, cilên şer li xwe kirin û yên ku derketina derveyê Medîneyê pêşniyar kiribûn poşman bûn û gotin: Hey Resûlullah! Wan êrîşî vir kiriye, ne me ev kiriye. Eger tu bivê, rûne. Vêca Pêxember (s.) got: "Pêxemberekî dema cilên şer li xwe kirin nabe wan deyne heta şer neke."

Pêxember (s.) digel hezar hevalên xwe derket, dema gihane şewtê ya ku li navbera Uhud û Medîneyê ye, Ebdullah kurê Ubeyy digel sêyeka şervanan jê veqetiyan û got: "Wî bi ya wan kir û bi ya me nekir."

### Li meydana Uhudê

Pêxemberê Xwedê (s.) kete rê, heta giha newala Uhudê. Uhud: Çiyayekî sê kîlometre dûrî Medîneyê ye. Pêxember (s.) pişta xwe û leşkerê xwe da çiyayê Uhudê û gote hevalên xwe: "Bila tu kes ji we, dest bi şer neke, heta em emrê şer nedinê."

Pêxemberê Xwedê (s.) kara şer kir, heftsed mêr pê re mabûn. Ebdullah kurê Cubeyr kire mîrê tîravêjan ku ew pêncî kes bûn, Jê re got: "Bi tîran, nehêle ji pişt me ve siwarî bêne me. Çi şer, li ya me be, çi jî li dijê me be." Ferman da wan ku ew li çepera xwe bimînin û qet wê bernedin. Çendî bibînin ku wa ye teyr û tûr leşkeran direvînin jî. Cewşenek di ser cewşenekê re li xwe kir û alaya cîhadê da destê Mûseb kurê Umeyr.

### Pêşbazî di navbera hevtemenan de

Pêxemberê Xwedê (s.) di roja cenga Uhudê de ji ber ku temenê wan piçûk bû civateke zarokan vegerande malê. Pêxemberê Xwedê (s.) Semûre kurê Cundeb û Raf'î kurê Xedîc vegerandin malê ku hê temenê xwe panzdeh salî bûn. Bavê Rafi'î mehdara kurê xwe kir û gotê: Ya Resûlellah! Kurê min Rafi'î tîravêj e. Vêca Pêxember (s.) destûra wî da.

Semûre kurê Cundeb jî xwe rapêşî Pêxember (s.) kir, ew jî di 'umrê Raf'î de bû. Pêxemberî (s.) ji ber ku piçûk bû ew vegerande malê. Vêca Semûre got: Tu destûra Rafi'î didî û destûra min nadî, çendan em bi navçengê herin hev, ezê wî bavêjim erdê jî. Vêca bi navcengê (gureşê) çûne hev. Semûre Rafi'î avête erdê. Vêca Pêxember (s.) destûra wî jî da, ew jî derkete şer û roja Uhudê şer kir.

### Ceng û lihevxistin

Herdu rex, hatin pêşberê hev û tam nêzîkî hev bûn. Hind keça 'Utbe ji nava jinan rabû ser xwe û pîrekan li pey zilaman li dahola şer didan û nav li wan didan, mêran li hev dan heta ceng sincirî. Ebû Ducane yê ku şûr ji dest Pêxember (s.)

girtibû û soz dabûyê ku dê heqê wî bidiyê, xwe berda nava neyaran û giha kê ew kuşt.

Hemze kurê Ebdulmuttalib jî şerekî dijwar û tund kir; pir leheng kuştin û tiştekî xwe li ber wî nedigirt. Wehşî koleyê Cubeyr kurê Mut'im li ber wî veketî bû, xedengeke wî hebû, nîşan şaş nedikir. Cubeyrî, soza azadkirinê dabûyê ku eger ew Hemzeyî bikuje. Hemze, di roja şerê Bedrê de apê wî Tu'eyme kuştibû. Herwiha Hinda jina Ebûsufyan jî nav li wî dida ji bo Hemze bikuje û dilê wê rehet bike. Wehşî rahişte xedenga xwe û avête Hemze heta di navbera lingên wî re derket û Hemze şehîd kete erdê.

Mûseb kurê Umeyr jî berevaniya Pêxember (s.) kir û bi lehengî şer kir heta şehîd bû. Misilman di îmtihaneke rind re derbas bûn.

## Serkeftina Misilmanan

Xwedê, arîkariya xwe ji Misilmanan re şand û soza ku dabû wan pêk anî. Heta wan pûtperest ji qada şer qewirandin, bezandin û jinan jî daw û devlingên xwe hildan û bazdan.

## Çawa çerxa şer li dijê Misilmanan geriya

Dema pûtperest bezîn, Misilman wisan ji xwe re mane sekinî, heta gihan cem pîrekên xwe. Vêca dema tîrbazan ev yek dîtin, ji wan were ku serkeftin misoger e û ew daketin qada şer. Ji hevalên xwe re gotin: Hevalno! Em herin xenîmeyê, em biçin xenîmeyê. Fermandarê wan emrê Pêxember (s.) anî bîra wan, lê wan bi ya wî nekirin. Ji wan were ku pûtperest êdî hew vedigerin û çeperên xwe berdan û vala hiştin. Bi vî awayî wan pişta Misilmanan li siwariyên pûtperastan vekirin. Heke tîravêjan ev şaşî nekirana, ji xwe tu kesî nikarîbû xwe nêzîkî Misilmanan bikirana. Lewra heta bi alhilgirên wan jî hatibûn kuştin û tu kesî ji wan nikarîbû xwe tevbide. Vêca pûtperest ji pişt ve hatin Misilmanan û hawarbirekî qîr da: Heyhê! Mûhemmed hatiye kuştin!

Misilman li hev vegeriyan, pûtperestan êrîş kirin û keys li wan anîn. Ew roja îmtîhanê bû. Neyar hat hemberê Pêxember (s.) kevir tê wer kir, lê ket û diranê wî yê kursiya şikand, rûyê wî dirrand, lêva wî birîndar kir û xwîn ji rûyê wî dirijiya, wî bi destê xwe vedimaliya û digot:

"Milletekî ku xwîn ji rûyê Pêxemberê (s.) xwe rêhtibe dê çawa xilas bibe û hal ev e ku ew jî wan gazî Xwedayê wan dike?!"

Misilmanan, cihê wî nizanîbûn. Elî kurê Ebûtalib rahişt destê Pêxember (s.) û Telhe kurê Ubeydullah ew hilda heta rabû jipiya. Malik kurê Sînan ji rûyê wî xwîn dimêht û dida-qurpand.

Şer, ne seraqetî bû, pêl bi pêl bû; leşker vedikişiya û ji nû ve dest pê dikir. Şikestin û jana Misilmanan, xisareta wan ya nefs û canan û şehîdketina hin kesên ku hêza îslamê û Misilmanan û arîkarê Pêxember (s.) û dînbûn ew di encama şemitîna rimbazan û heta dawî bi cih neanîna wan ya fermanên Pêxember (s.) û ji çeper û kozika xwe derketina wan ya ku Pêxember (s.) nîşanî wan dabûyî hate rastê.

Di vê babetê de Xwedê gotiye:

*"Bêguman Xwedê peymana xwe anî cih, dema we bi destûra wî ew dikuştin. Paşîkê hûn ji hev ketin, hûn di fermanê de bi hev ketin û piştî we ya ku jê hez dikir dît, we bêemrî kir. Ji we kî heye ku cîhanê dive û ji we kî jî heye ku axiretê dive. Piştre wî hûn ji wan vegerandin da ku we îmtîhan bike. Bi rastî li we buhurî. Xwedê li bawermendan xwediyê camêriyê ye."* (Alî 'Îmran: 152)

### Hin nimûneyên rind ji hezkirin û cangorîtiyê

Ebû 'Ubeyde kurê Cerah bi diranê xwe yê pêş yek xîç ji rûyê Pêxember (s.) kişand, diranê wî ket, xîçê dî kişand, diranê wî yê dî jî ket; her du diranê wî yê pêş ketin. Ebû Ducane xwe li ber Pêxember (s.) kire mertal, xwe bi ser wî de tewandibû

û tîr li pişta wî diketin... Se'd kurê Ebûweqqas xwe avête ber Pêxember (s.) Pêxemberî (s.) tîr didanê û digotê: "Dê-bavê min bi qurbana te bûyo, bavêje!"

Çavê Qetade kurê Nûman derb lê ket, heta kete ser dêma wî. Pêxember (s.) bi destê xwe lê vegerand, vêca ew ji yê dîtir rindtir bû û bêtir bû ku pê didît. Pûtperestan qesda wî (s.) kir. Wan ya ku Xwedê nedihişt, diviyan bikin. Vêca nêzî deh kesan xwe didan ber wî (s.) heta tev hatin kuştin. Vêca Telhe kurê 'Ubeydullah bi wan re têdikoşiya, destê xwe li ber Pêxember (s.) kire mertal û pê, ew diparast. Vêca derbek li movikên wî ket û destê wî şeht bû.

Pêxember (s.) li wirê kir ku hilgere ser kevirekî bilind, lêbelê ji ber birîn û bêtaqetbûnê nekariya, Telhe di bin wî re rûnişt heta hilgeriya serê. Dema nimêjê hat, wî (s.) li pêşiya wan rûniştîka nimêj kir.

Çi dema xelkê bazdan, Enes kurê Nedir-apê Enesê kurê Malik- çakarê Pêxember (s.) nereviya û xwe da pêş. Se'd kurê Mu'az çav pê ket, jê re got: Hey Bavê Umer! Bi ku ve? Enes gotê: Bi ber bêhna cennetê ve, ey Se'd! Ez bêhna wê ji rexê Uhudê ve dikim.

Enes kurê Nedir giha zilamine mihacir û ensarî ku wa ye destê xwe bi ber xwe ve berdane ji wan re got: Hûn li hêviya çi rûniştine? Gotinê: Pêxember (s.) hatiye kuştin. Ji wan re got: Vêca piştî wî hûn dê çi ji heyatê bikin? Rabin ser xwe, ji bo tişta ku ew ji bo wê mirî, hûn jî ji bo wê bimrin. Piştre berê xwe da neyaran û şer kir heya şehîd ket.

Enes dibêje: Di wê rojê de me li wî heftê derb dîtin, xweha wî bi tenê ew nas kir, wê jî bi tiliyên wî, ew nas kir.

Ziyad kurê Seken digel pênc zilamên ensarî di ber Pêxemberê Xwedê (s.) de şer kirin, di ber wî (s.) de peyapey şehîd ketin û Ziyad jî şer kir heta birînan nehişt ku ew tevbigere. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Wî nêzîkî min bikin." Vêca ew nêzî wî (s.) kirin û lingê xwe jê re kire balgeh. Heta can da jî rûyê wî li ser lingê Pêxember (s.) bû.

Emr kurê Cemuh zilamekî şeht bû. Çar kurên wî yên xort hebûn, bi Pêxember (s.) re diçûn cîhadê. Dema Pêxember (s.) berê xwe da rexê Uhudê, wî jî xwest pê re derkeve cîhadê. Kurên wî jê re got: Bi rastî Xwedê destûr daye te, xwezî tu rûniştî bana, em besî te ne, ji xwe Xwedê barê cîhadê ji ser te daniye.

Emr kurê Cemûh rabû çû cem Pêxember (s.) û jê re got: Ev kurên min nahêlin ez bi te re werim cîhadê. Wellahî ez hêvîdar im, şehît bikevim û bi vê kulekiya xwe ve biçim cennetê. Pêxember (s.) jê re got: "Xwedê cîhad, ji ser te daniye." Ji kurên wî re jî got: "Çima hûn nahêlin, belkî Xwedê şehîtbûnê bike nesîbê wî." Vêca ew bi Pêxember (s.) re derkete cîhadê û di roja Uhudê de şehîd ket.

Zeyd kurê Sabit dibêje: Pêxember(s.) di roja şerê Uhudê de ez şandim ku li Se'd kurê Rebî' bigerim. Vêca ji min re got: "Heke tu wî bibînî, silavên min lê bike û jê re bibêje ku Pêxember (s.) ji te re dibêje: Tu xwe çawa dibînî? " (Zeyd) got: Ez li navbera kuştiyan li wî digeriyam, min ew dît ku wa ye hemmme (piçek) rûh tê de maye, heftê derb lê ketibûn, hin yên tîran, hin yên riman û hin yên şûran bûn. Min gotê: Hey Se'd Pêxember (s.) silavan li te dike û ji te re dibêje: Ji min re ragihîne ka tu xwe çawa dibînî? Gote min: Silavan li Resûlullah jî bike û jê re bibêje: Ya Resûlullah! Ez bêhna cennetê dikim, ji xelkên me; Ensariyan re bibêje: Tu uzr ji we re nîn e li cem Xwedê heke tiştek were serê Pêxember (s.) û di we de çavine ku rohniyê bibînin hebin. Û canê xwe teslîm kir.

Ebdullah kurê Cehş di bara wê rojê de dibêje: Xwedayê min! Ez bi te li ser vê sond dixwim ku ez sibê rastî dijmin werim, ew jî min bikujin. Piştre zikê min biqelêşin, guh û pozê min jêkin û piştre jî tu ji min bipirsî ka ew ji ber çi çêbû? Vêca ez jî bibêjim: Ew ji bo te çêbû.

**Misilman vegeriyan navenda xwe**

Çi dema Misilmanan zanîn ku Pêxember (s.) sax e, pê re rabûn û ew jî digel wan rabû çûne qada şer. Ubeyy kurê Xelef gihayê û digot: Hey Mûhemmed! Bila ez bimrim heke tu sax bimînî. Pêxember (s.) got: Dev jê berdin, bila were. Vêca çi dema nêzîk bû, Pêxember (s.) ji hevalekî xwe rimek girt, piştre berê xwe dayê û li stûyê wî da, ew ji hespê wî da erdê û kir ku çend teqlan bavêje.

Elî kurê Ebûtalib derket, meşka xwe tije av kir û xwîna rûyê wî şûşt. Qîza Pêxamber Fatîme jî rûyê wî dişûşt. Elî jî bi meşkê av dianî, çi dema Fatîmeyê dît ku av xwînê zêde dike; ne ku disekinîne, rahişte perçek ji lemê gulan, şewitand, bi birîna wî ve kir û xwîn sekinand.

Aîşe keça Ebûbekir û Ummuselîm, meşk tije av dikirin, bi pişta xwe dikişandin û didane devên Misilmanan. Ummusuleytê jî meşkên wan ji wan re tije av dikirin.

Hind keça 'Utbe û jinên digel wê ketibûn nava kuştiyên Misilman, guh û bêvilên wan jê dikirin, zikê Hemze qelaşt, kezaba wî deranî, da ber diranên xwe nekariya daqurpîne. Vêca avêt.

Çi dema Ebûsufyan xwest vegere, hilgeriya serê çiya, piştre bi dengekî bilind qêriya: Şer şens e, rojek bi rojekê ye, bijî Hubel!

Pêxember (s.) ji Umer re got: Hey Umer! Rabe bersiva wî bide, bibêje: Xwedê bilindtir û mezintir e, wekhevî nîne; kuştiyên me li cennetê ne û kuştiyên we li dojehê ne. Ebûsufyan got: "Uzza yê me ye, Uzzayê we tune." Pêxember (s.) got: Bersiva wî bidin, gotinê: Em çi bebêjin? Got: "Bibêjin: Xwedê dostê me ye, tu dostekî we tune."

Çi dema ew vegeriya û Misilman jî vegeriyan, gazî kir: Sala ku were, bila civanê me û we Bedr be. Pêxemberê Xwedê (s.) ji hevalekî xwe re got: "Bibêje: Belê, di navbera me û we de ew civan e." Vêca her kes li kuştiyên xwe geriya û Pêxemberê Xwedê (s.) li ser Hemze pir xemgîn bû. Hemze, hem apê wî bû, hem şîrbirayê wî bû, hem jî piştemêrê wî bû.

### Sebra jineke bawermend

Sefiye keça Ebdulmuttelib hat ku li cendekê Hemze binêre. Hemze birayê wê yê ji dê-bav bû. Pêxemberê Xwedê (s.) ji kurê wê Zubeyr kurê Ewam re got: "Wê vegerîne, bila ew ya ku anîne serê birayê wê nebîne." Vêca wî jê re got: Yadê! Pêxemberê Xwedê (s.) fermana te dike ku tu vegerî. Gotê: Çima? Min bihîstiye ku sosret anîne serê wî, ev jî ji bo Xwedê bi birayê min kirine, sond be! Ez dê xêra xwe li cem Xwedê hesab bikim. Xwedê hez ke, ez dê sebrê bikşînim. Vêca hate ser cendekê wî, lê meyzand, li serê nimêj kir, li Xwedayê xwe vegeriya û lêborîna gunehên xwe jê xwest. Piştre Resûlullah fermana binaxkirina cendekê Hemze da û ew veşartin.

### Çawa Mûseb kurê Umeyr û şehîdên Uhudê hatin binaxkirin

Mûseb kurê Umeyr; alhilgirê Pêxemberê Xwedê (s.) û beriya Îslamê ew xortê Qureyşiyan yê herî zengîn bû. Bi kurkekî hate kefen kirin ku dema serê wî dinixumandin, lingên wî li derve diman û dema lingên wî dinixumandin serê wî li derve dima. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Serê wî binixumînin û îzxîrê[1] bidin ser lingên wî."

Pêxemberê Xwedê (s.) ji kuştiyên Uhudê du şehîd dikirin kefenekî bi tenê, piştre digot: "Kîjanî bêhtir Qur'an ji ber bû? " Dema jê re yek destnîşan dikirin, ew pêşî dikire qebrê û got: "Ez roja qiyametê ji wan re şahid im." Ferman da ku wan bi xwîna wan ve binax bikin; ew neşûştin û li ser wan nimêj jî nekirin.

### Jin Pêxember di ser xwe re digirin

Misilman vegeriyan Medîneyê, di ber jineke Mala Dînar de buhurîn, mêrê wê, birayê wê û bavê wê digel Pêxemberê Xwedê (s.) bûn, û tev hatibûn kuştin. Çi dema jê re eşkere ki-

---

1 Îzxîr: giyayekî bêhnxweş e.

rin got: Pêxemberê Xwedê (s.) çi jê bûye? Gotinê: Baş e, hey dayîka filankes! Hemd ji Xwedê re be, hûn çawa bivên ew, wisa ye. Got: Wî nîşanî min bidin, da ku ez lê meyzênim. Jê re hate destnîşankirin, heta wê ew dît, got: Piştî te her karesat kêm û rehet e.

### Derketina Pêxember û Misilmanan di pey şopa dijminan, mirinxwestina wan di ber arîkariya Pêxember de

Pûtperestan gazind ji hev kir û ji hev re gotin: We tiştek nekir, we hêza wan şikand, ew ceza kirin, piştre we dest ji wan berda û we ew neqelendin. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) ferman da Misilmanan ku biçine neyaran. Misilman jî birînên wan pir xeddar bûn. Çi dema sibeha roja piştî serê Uhudê hilat, banghildêrê Pêxemberê Xwedê (s.) gazî kir ku Misilman derkevin şerê neyaran û bang kir ku ji bilî yên dihû bi me re bûn bila tu kesê dî dernekeve.

Misilman tev birîn-xedar û giran bûn û giş digel Pêxemberê Xwedê (s.) derketin, heta gihane "Hemraul-Esed" ew cihek e ku heşt mîlan ji Medîneyê dûr e. Pêxemberê Xwedê (s.) digel Misilmanan li wirê roja duşemê, sêşemê û çarşemê ma. Piştre vegeriyan Medîneyê.

Di roja cenga Uhudê de piraniya xwe Ensarî heftê Misilman şehîd bûbûn û bîst û du peyayên pûtperest jî hatibûn kuştin.

### Ez ji xwe bêhtir ji wî hez dikim

Êlên Edel û Qare, di sala sisiyê hîcretê de ji Misilmanan çend kes xwestin da ku Îslamê nîşanî wan bidin, vêca pêxemberê Xwedê (s.) bi wan re şeş hevalên xwe şandin. Asim kurê Sabit, Xubeyb kurê Eddî û Zeyd kurê Desenne, vêca xedr li wan kirin û pirên wan kuştin.

Zeyd ji Heremê deranîn da ku wî bikujin. Çend zilamên Qureyşî hatin cem hev. Ebûsufyan jî yek ji wan bû. Ebûsufyan

jê re got: Hey Zeyd! Tu bi Xwedê kî tu dixwazî vêga di şûna te de Mûhemmed li cem me bûna û tu jî li nav xelkê xwe bûyayî. Gotê: Wellahî! Ez naxwazim ku Mûhemmed li cihê xwe yên niha jî stiriyeke ku wî biêşîne, di bedena wî re here û ez jî li nav xelkê xwe rûniştibim. Ebûsufyan got: Min bi qasî ku hevalê Mûhemmed jê hez dikin nedîtiye ku tu kesê din ji tu kesî hez bike. Piştre jî ew kuştin.

Herçî Xubeyb bû, dema ew anîn da ku wî daleqînin, ji wan re got: Heke hûn munasib bibînin ku bihêlin ez du reket nimêj bikim, bihêlin ez bikim. Gotinê: Tu bi kêfa xwe yî, nimêj bike. Vêca wî du reket sunnetên welê rind û sitewiyayî kirin, piştre berê xwe da wan û got: Wellahî, heke ne ji ber zena we bûna ku hûnê bibêjin qey min ji tirsa kuştinê nimêj dirêj kiriye, min dê hê zêdetir kiribûna û ev herdu malikên şiîrê xwendin:

*Ez hîç gazindan nakim, dema Misilman bême kuştin;*
*Li ser kîjan kêlekê bim, kuştina min ji bo Xwedê ye.*
*Eva ha jî ji bo zatê Xwedê ye, heger ew bixwaze*
*Dikare her perçeyên belawela jî bîne cem hev.*

### Bîra Me'ûnê

Pêxemberê Xwedê (s.) hin hevalên xwe li ser daxwaza Amir kurê Malik şandin da ku wan vexwînin Îslamê. Şande ji heftê Misilmanên bijarte pêk hatibû, ew meşiyan heta gihane bîra Me'ûnê. Ji êla Mala Suleym çend bavik: 'Esiye, Re'el û Zekwan li ser wan hatin hev û di koça wan de dor li wan girtin. Çi dema ew dîtin ku va ye şûrên wan ji wan girtin, li wê derê şer kirin, heta yê dawîn jî hate kuştin û ji bilî Ke'b kurê Zeyd yek ji wan nefilitî. Ew li jiyanê ma heta ku di roja şerê Xendeqê de şehît ket.

### Gotina kuştiyekî bû sebebê Misilmanbûna mêrkuj

Di vê cerdê de, Heram kurê Milhan ji aliyê Cebar kurê Selma ve hate kuştin. Sebebê Misilmanbûna wî bû bêjeyek ku Heram ew li ber mirina xwe gotî. Cebar dibêje: Ya ku ez vex-

wendim Îslamê; min rimek li navmilê zilamekî ji wan. Wê rojê min li serê rimê dimeyzand dema ji sînga wî derhat, min bihîst ku wî digot: Bi Xwedayê Kabeyê! Ez gihame xelata xwe. Vêca min ji xwe re got: Ew giha çi xelatê? Qey min ew nekuşt?! Heta piştî vê, min li gotina wî pirsî. Gotine min: Ew xelat şehîdbûn e. Vêca min got: Bi Xwedê kim ew giha xelata xwe. Vêca ev gotin bû sersedema Misilmanbûna wî.

### Qewirandina Mala Nedir

Pêxemberê Xwedê (s.) derkete cem Mala Nedir -ew ji Cihûyan êleke mezin e- di bara xwîna du kuştiyên ji Mala Amir de arîkariya wan xwest. Di navbera Mala Nedir û Mala Amir de peyman û ehdek hebû. Ew bi kelamekî şîrîn bi Pêxemberê Xwedê (s.) re peyivîn û soza qenciyê danê. Lêbelê wan di dilên xwe de reşkujî/sûîqesd û xedir veşartî hiştin. Pêxemberê Xwedê (s.) li ber dîwarê xaniyekî wan rûniştî bû. Wan ji hev re gotin: Hûnê mêrik (Pêxember) wekî vî halê wî hîç nebînin. Vêca kî mêr e, bila here ser banê vî xaniyî, kevirekî bavêje serê û me tevan jê xilas bike? Li dora Pêxemberê Xwedê (s.) Ebûbekir, Umer, Elî û hin hevalên wî yên din jî hebûn.

Ji asîmanan xebera qesda wan ji Pêxember (s.) re hat. Vêca Pêxember (s.) rabû, vegeriya Medîneyê, ferman da Misilmanan ku xwe ji şerê wan re kar bikin û biçine wan. Piştre bi Misilmanan re kete rê heta giha warê wan. Ev jî di meha Rebîûlewelê; sala çarê hîcretê de pêk hat û ew şeş şevan dorpêç kirin. Xwedê tirs avête dilên wan. Vêca ji Pêxemberê Xwedê (s.) xwest ku rê li wan veke, xwîna wan nerêje û ji bilî çek û sîlehan, bi qasî ku li deveyekê bar bibe, malê wan bide wan. Vêca Pêxember (s.) pêşniyar û teklîfa wan qebûl kir, wan jî bi qasî kariyan li deveyekê bar bikin mal bi xwe re birin û koça xwe pêçan û çûn.

Pêxemberê Xwedê (s.) malê wan li mihacirên pêşîn par ve kir.

### Xezweya Zaturreqî

Pêxemberê Xwedê (s.) sala çarê hîcretê çû xezweya Necdê, meşiyan heta gihan bexçekî xurmeyan, Misilman jî pê re derketin, ew şeş bûn, devehek bi wan re hebû, ji meşê lingên wan qul bûn, neynûkên wan rabûn, ketin û wan paçik li lingên xwe girêdidan, ji loma navê xezweya Zaturreqî' (xwedî-paçik) lê kirin. Herdu alî nêzî hev bûn, di navbera wan de şer neqewimî, xelk ji hev tirsiyan, heta pêxemberê Xwedê (s.) li pêşiya Misilmanan nimêja tirsê kir.

### Xezweya Xendeqê yan jî xezweya hevalbendan

Xezweya Xendeqê yan jî cenga hevalbendan, di meha Şewala sala pêncê hîcretê de qewimî. Ew cengeke cudekar û bi jan û karesat bû. Tê de belayeke wilo bi ser Misilmanan de hat ku berî wê hîç belayek welê nehatibû serê wan. Xwedê di bara wê de dibêje: *"Dema ji ser we ve û ji bin we ve hatin we, dema çav zeloq bûn, dil gihan qirikê û we di bara Xwedê de zen dikirin, ha li wirê bawermend hatin imtîhankirin û bi dijwarî hejiyan."* (Ehzab: 11)

Sebebê vê cengê ev bû; çend kesên Cihû, ji Mala Nedir û Mala Wail çûne Mekkeyê cem Qureşiyan û ew vexwendine şerê Pêxember (s.). Qureyşiyan, ji destê şer dîtibûn; jan, agirê wê ew sotibûn, wan xwe jê dûr digirt û dilê wan di şer de nebû. Vêca heyeta Cihûyan şer ji wan re xemiland, li ber wan hêsan kir û ji wan re got: Emê bi we re bin, heyanî em rayên wan hil bikin, vê yekê kêfa Qureyşiyan anî. Vêca bersiva banga wan dan. Ji bo vê yekê civiyan, xwe ji bo şer kar kirin. Piştre heyet ji Mekkeyê derket hate bal Xetefan û ew jî vexwendin cengê, li nava êlan geriya û projeya cenga Medîneyê û kabûl kirina Qureyşiyan ya vê cengê rapêşî wan kir.

Hemûyan li ser hin mercan tifaq kir. Qureyşiyan çar hezar şervan û Xelefaniyan jî şeş hezar şerker amade kirin, şervanên wan bûn deh hezar û fermandariya leşker jî spartin Ebûsufyan kurê Herb.

### Zanîn, malê bawemendî yê windabûyî ye

Misilmanan biryara asêgirtina Medîneyê û berevaniya wê dan. Jimara şervanên Misilman ne zêdeyî sê hezaran bû. Selmanê Farisî li virê kolana xendeq û konçalan li Medîneyê destnîşan kir. Selman got: Ya Resûlullah! Li welatê Firsê, dema em ji êrîşa siwariyan ditirsiyan, me li pêşiya wan kort û koncal dikolan. Pêxemberê Xwedê (s.) fikra wî qebûl kir û ferman da ku li rexê vekirî yê ku ditirsiyan dijmin ji wî ve êrîş wan bikin ku ew koncalan bikolin. Pêxemberê Xwedê (s.) di neqaba hevalên xwe de koncal par ve kirin û ji her deh kesan re çil zend ketin.

### Rûhê wekhevî û palpiştiyê di navbera Misilmanan de

Pêxemberê Xwedê (s.) di kolana çalan de xebitî, dilê Misilmanan bijand xêr û mukafetê. Misilmanan jî di kolana kortikan de pê re xebitîn. Vêca wî (s.) jî da xwe û wan jî xwe dayê. Ew çax pir serma bû û tenê qûtê wan, yan ber dilê wan digirt, yan jî nedigirt.

Ebûtelhe dibêje: "Me gilehê birçîbûna xwe li cem pêxemberê Xwedê (s.) kir û me kevir ji zikê xwe rakirin. Pêxemberê Xwedê (s.) jî du kevir ji zikê xwe hildan. Misilman pir dilşad bûn, hemdê Xwedê dikirin; şiîr dixwendin, ne gilî dikirin, ne jî diwestiyan."

Enes (r.) dibêje: "Pêxemberê Xwedê (s.) derkete xendeqan/ koncalan, meyzand ku wa ye di sibeheke sar de mihacir û ensarî çalan dikolin. Tu koleyên wan jî nebûn ku ji wan re bikolin. Vêca dema wî te'b û birçîbûna wan dît, got: "Xwedayê min! Jiyan, jiyana axretê ye. Li ensar û mihaciran bibuhure."

Wan jî bersiva wî da û gotinê: "Em, ew in ku peyman dane Mûhemmed, li ser cîhadê ebediyen heya em sax bimînin."

Di koncalekê de kevirekî hişk û mezin derkete pêşiya Misilmanan ku teviran ew nedigirt, vêca wan jî ev yek ji pêxemberê

Xwedê (s.) re gileh kir. Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) ew dît rahişte tevir û got: "Bi navê Xwedê" û derbek lê da sêyeka wî şikand û got: "Ellahû Ekber! Mifteyên Şamê ji min re hatin dayin. Wellahî ez qesrên wê yên sor bibînim, Xwedê hez ke."

Piştre derbeke duduyan lê da, sêyekeke dî jî şikand, got: "Ellahu Ekber! Kilîdên Firsê ji bo min hatin dayîn. Wellahî, ez serayên Medaînê yên sipî dibînim."

Piştre derbeke sisêyan lê da got: "Bismillah" û ji kevir aliyê mayî jî şikand û got: "Ellahû Ekber! Mifteyên Yemenê ji bo min hatin dayîn. Wellahî ez dergehên Sen'ayê ji vî cihî vêga dibînim."

### Mucizeyen Pêxember di xezweye de

Gelek mûcîze, li ser destê Pêxember (s.) xuya bûn. Dema di hin koncalan de cihekî hişk derdiket pêşiya Misilmanan firaxeke avê dixwest, tif dikire navê, piştre duayê ku dixwest dikir û av direşand wî cihê hişk, vêca li berê diherifî û dibû wekî sêlê. Bereket di xwarineke hindik de xuya bû heya pê gelekan têr xwar û têra leşker gişî kir.

### Gava ji jor û jêrê we ve hatin we

Qureyşî û Xetafaniyan bi deh hezar leşkerê xwe û peyrewên xwe ve berê xwe dane Medîneyê û hatin pêşiya wê, Misilman jî bi sê hezar leşker ve derketin hemberê wan ku di navbera wan de koncal hebûn.

Di neqeba Misilman û Cihûyên Mala Qureyze de peymanek hebû. Mezinên Mala Nedir, Heyyê kurê Exteb ew ajotin ser şikandin û xirakirina peymanê, vê yekê piştî çûn û hatin û asêbûnê ku pêxemberê Xwedê (s.) ew anîbû cih. Vêca li cem vê îmtîhan û jan mezin bû, tirs dijwar bû, stêra zendîqiyê di navbera hin minafiq û zendîqan de şewq da.

Pêxemberê Xwedê (s.) xwest di navbera xwe û Xetefaniyan de peymaneke li hevhatinê pêk bîne ku sêyeka fêkiyê

Medîneyê bide wan da ku barê Ensariyan sivik bibe û hilmeke rehet bidin û bistînin. Lewra para herî mezin ji barê şer li ser wan bû.

Piştre Pêxemberê Xwedê (s.) dema ji Se'd kurê Mu'az û Se'd kurê 'Ubade sebat, berxwedan, xweragirtin û asêbûna li hemberî dijminan dît, ji vê yekê vegeriya. Se'd kurê Mu'az got: Ya Resûlullah! Em û ew li ser hevrîçêkirinê, pûtperestiyê bûn, me îbadetê Xwedê nedikir û me ew nas nedikir, wan bes bi mêvanî, yan jî kirrîn dikarîn xurmeyekê bixwin, êdî dema Xwedê bi Îslamê rûmet da me, rêya rast û durist da ber me û bi wê û te em ezîz û xurt kirin, em dê malên xwe bidin wan?! Wellahî, tu pêdiviya me bi vê nîne. Wellahî, em ji bilî şûr tiştekî dî nadin wan, heya Xwedê daraza xwe di navbera me û wan de bide. Pêxemberê Xwedê (s.) gotê: "Naxwe tu û ew li hev."

## Di navbera fêrisê Îslamê û fêrisê cehiliyyetê de

Pêxemberê Xwedê (s.) û Misilman rabûn, neyarên wan jî dora wan pêçabûn û di nav wan de şer neqewimîbû lêbelê; hin siwarên Qureyşiyan hespên xwe dibezandin heta li ser koncalê sekinîn. Dema ew dîtin, gotin: Wellahî, ev dahveke wisa ne ku ne Ereban ew vedaye!

Piştre ji koncalê cihekî teng dîtin, danîn hespên xwe û xwe ji bo şerî di ser re avêtin. Êdî pê avêtin nav axa Medîneyê. Yek ji wan jî fêrisê navdar; ewê ku berberê hezar fîrisî dihat nirxandin; 'Emr kurê Ebdu Widd bû. Çi dema sekinî, got: Kî dê were hemberê min? Elî kurê Ebûtalib çû hemberê wî û gotê:

– Hey 'Emr! Te peyman daye Xwedê ku zilamekî Qureyşî te vexwîne yekî ji du tiştan tê jî wê bigirî.

– Belê.

– Ez te bi bal Xwedê, Pêxemberê wî û Îslamê ve vedixwînim.

– Tu pêdiviya min bi wê tuneye.

– Ez te vedixwînim peyabûnê.

– Çima birazî! Wellahî ez naxwazim te bikujim.

– Lêbelê wellahî, ez bi xwe dixazim te bikujim.

Vêca dema ‘Emr ev bihîst sincirî, xwe ji hespê xwe avêt erdê, hespê xwe da erdê, li rûyê wî da û dûv re berê xwe da Elî. Her du ji hev re daketin, hevûdu birin û anîn û Elî ew kuşt.

## Dayikek li ser şer û şehîdbûnê nav li kurê xwe dide

Dayika bawermendan Aîşe dibêje: Ew -beriya nixumandin li ser wan were ferzkirin- digel hin jinên di asêgeha mala Harîse de bûn, Se‘d kurê Mu‘az di ber wan de buhurî, kumzirxekî kurt lê bû, zendê wî tev jê derketibû û wî sirûd digot. Vêca dayîka wî jê re got: Bigihe hevalên xwe lawê min, tu dereng mayî. Aîşe (r.) dibêje; min jê re got: Hey dayika Se‘d! Wellahî, ez dixwazim cewşenê Se‘d hê mezintir û dirêjtir bana û ya ku Aîşe (r.) jê ditirsiya ew çêbû; tîrek avêtin Se‘d, rayeke zendê wî qut kir û ew di xezweya mala Qureyze de şehîd ket.

## Leşkerên erd û asîmanan yên Xwedê ne

Pûtperestan hawîrdorê Misilmanan girt, heta ji bir bi bir leşkerên xwe kirin ku mîna ew di kelehê de bin hawîra wan pêçan û tam nêzî mehekê dor li wan girtin. Vêca her aliyên wan girtin, ew xistin tengiyeke dijwar. Êdî nîfaqê xwe da der û hin kesan destûr ji Pêxemberê Xwedê (s.) xwestin da ku vegerin Medîneyê. Jê re gotin: *“Bêguman malên me vekirî ne, ew ne vekirî bûn lêbelê; wan qesda revê dikir.”* (Ehzab: 13)

Di navberekê de ku pêxemberê Xwedê (s.) û hevalên xwe di nav tirs û tengiyeke wilo de bûn ku Xwedê ew ragihandiye, ji nişka ve Nu‘eym kurê Mesûdê Xetefanî hate balê û jê re got:

Ya Resûlullah! Ez Misilman bûm, gelê min hîn nizanin ku ez Misilman bûme. Vêca tu çi bivê fermana min pê bike. Pêxemberê Xwedê (s.) jê re got:

“Tu di nava me de zilamekî bi tenê yî. Heke tu karibî, xwe ji me dûr bigre. Lewra şer xapandin e.”

Vêca Nu‘eym kurê Mesûd, ji cem Pêxember (s.) derket, çû bal Mala Qureyze, gotinek welê ji wan re got ku di bara rastiya helwesta wan û piştgiriya wan ya ji bo Qureyşî û Xetefaniyên ku ne ji xelkê welatê wan bûn û neyartiya wan ya ji bo mihacir û Ensariyên ku di nav xelkê walatê wan û cîranên wan yên seraqetî de ne, ew xistin sawir û gumanan. Ji wan re îşaret kir ku ew digel Qureyşî û Xetefaniyan şerê Misilmanan nekin. Heta hin giregirên wan li cem xwe bi gerewî negirin, da ku di destê wan de bin û ji wan re pêbaweriya wan bin. Jê re gotin: Te fikra rastîn nîşan da.

Piştre ji cem mala Qureyze derket, hate bal Qureyşiyan, ji wan re şîretkarî û dostaniya xwe diyar kir û ji wan re ragihand ku Cihû li kirina xwe poşman bûne, dê ji we wek temînata peymanê çend giregirên we bixwazin û dê wan bidin destê Pêxember (s.). Ew û hevalên xwe jî dê serê wan jêkin û wan bikujin.

Piştre ji cem Qureyşiyan derket, çû cem Xetefaniyan û tişta ku ji Qureyşiyan re gotibû ji wan re jî got. Herdu alî bi endîşe bûn, dilên wan li biwara cihûyan bi kînê keliya, cûdatî û bêtifaqî kete navbera hevalbendan; êdî tev ji hev ditirsiyan.

Çi dema Ebûsufyan û serekên Xetefaniyan xwestin ku şerekî vebirî di nava xwe û Misilmanan de bikin, Cihûyan xwe sist kir û ji wan hin zilamên wan wek gerew xwestin. Vêca Qureyşî û Xetefaniyan rastiya gotina ku Nu‘eym kurê Mesûd ji wan re ragihandî bawer kir. Wan jî xwe ned ber daxwaza Cihûyan. Cihûyan jî rastiya gotina ku Nu’eym kurê Mesûd ji wan re ragihandibû yeqîn kir. Herwiha ew ji ber hev ketin, civata wan bela bû û nakokî kete nava wan.

Xwedê wek qenciyekê li Pêxemberê xwe; di şevên pir serma û seqem de bahozeke wilo dijwar şande ser hevalbendan ku beroşên wan diqulibandin û holikên wan hildiweşandin.

Ebûsufyan rabû û got: Gelî Qureyşiyan! Wellahî, cihê hûn lê ne, ne warê seknê ye. Va ye çêre, qût û pûta me qediya, Mala Qureyze li me qulibîne, em bi tiştine ku li xweşiya me nayê hesiyane, jixwe hûn bager û bahozê jî dibînin. Ne beroşên me li ser tifikan disekinin, ne agir pê dikeve û ne jî çadir xwe digirin. De heydê koça xwe bipêçim û biçim. Ebûsufyan rabû ber bi lokê xwe ve çû, hê ew girêdayî bû, li serê rûnişt, piştre lê da, ew şipiya ma û ew vekir.

Dema Xetefeniyan ya ku Qureyşiyan kir bihîstin, wan jî xwe da hev û vegeriyan welatê xwe. Pêxemberê Xwedê (s.) jipiya bû, nimêj dikir. Huzeyfe kurê Yeman -yê ku pêxemberê Xwedê (s.) ew bi sîxûrî şandibû nava hevalbendan- jê re ragihand. Huzeyfe diçû nava wan; li wan dinêrî û ya ku hevalbandan dikir didît, vedigeriya û jê re radigihand. Çi dema li wî bû sibeh, ji koncalê vegeriya Medîneyê. Misilman jî vegeriyan û çekên xwe danîn.

Xwedê rast gotiye:

*"Gelî yên ku bawerî aniye! Qenciya Xwedê ya li ser xwe bînin bîra xwe, dema leşkerin hatin we, vêca me bi ser wan de bayek û leşkerine ku wan nedidîtin şand. Xwedê ya ku hûn dikin dibîne."* (Ehzab: 9)

Xwedê rast gotiye:

*"Xwedê ewên ku kafir bûne, bi hêrsa wan re vegerandin û ew negihandin tu qenciyekê. Xwedê di şer de besî bawermendan e. Xwedê hêzdar û zorbir e."* (Ehzab: 25)

Herb bi dawî bû û Qureyşî piştî vê herbê êdî venegeriyan şerê Misilmanan. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Qureyşî, piştî vê sala we, êdî dê neyêne şerê we. Lêbelê hûn dê herin şerê wan."

Di roja şerê Xendeqê de, bi îhtimala herî zehf heft Misilman şehîd ketin. Çar muşrik jî hatine kuştin.

### Xezweya Mala Qureyze peymanşikandina Mala Qureyze

Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) çûbû Medîneyê, peymannameyek di navbera Mihacir û Ensariyan de nivîsîbû. Tê de soz dabû Cihûyan, dînê wan û malên wan xistibû binê temînatê, şertin danîbûn ser wan û şertin ji bo wan jî danîbûn. Di nava peymanê de ev hatibû nivîsîn: Hevkarî di navbera wan de li hemberî yê ku şerê xelkê vê peymanê bike, şert e. Di navbera wan de hevkarî, şîret û pend -ne li ser neqenciyê- şert e. Di nav wan de hevkarî li hemberî yê ku êrîşî Yesrîbê bike, şert e.

Lêbelê Heyy kurê Exteb; serokê Mala Nedir serfiraz bû û kir ku mala Qureyze peymanê bişkînin û' piştgiriya Qureyşiyan bikin. Piştî ku mezinê wan Ke'b kurê Esedê Qureyzî ji wan re got: Min ji bilî wefadarî û rastiyê tiştekî din ji Mûhemmed nedîtiye. Ke'b kurê Esed peymana xwe şikand û xwe ji ehda ku di navbera wî û pêxemberê Xwedê (s.) de heyî bêrî kir.

Dema xebera peymanxerakirina wan giha Pêxemberê Xwedê (s.) Se'd kurê Mu'az, serekê Ewsiyan hevkarên mala Qureyze bûn û Se'd kurê Ubade mezinê Xezreciyan digel çend zilamên ensarî şandin cem wan da ku lêpirsînê bikin, dîtin ku waye ew ji ya ku gihaye wan hê xerabtir e, û waye pêxemberê Xwedê (s.) çêran dikin û ev bersiv dane wan: Pêxemberê Xwedê (s.) kî ye? Tu soz û peyman di navbera me û Mûhemmed de tune. Wan xwe kar dikirin da ku êrîşî Misilmanan bikin. Herwiha wan hewl dida ku ji pişt ve derban li leşkerê Misilmanan bidin ku ev jî ji êrîşa eşkere û ji herba li meydanê dijwartir û kambaxtir e.

Xwedê di bara vê de dibêje: *"Dema ji ser we ve û ji bin we ve hatin we."* (Ehzab: 10) Ev jî gelekî li Misilmanan tûj û çetîn hat.

### Ber bi mala Qureyze ve çûn '

Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) û Misilman ji şerê Xendeqê vegeriyan Medîneyê û çekên xwe danîn. Cebraîl (s.) hate balê û jê re got: Ya Resûlullah! Qey te çek danîne? Jê re got: Belê.

Vêca Cibraîl (s.) gotê: Milyaketan hêjî çek nedanîne. Bêguman Xwedê ferman li te dike ku tu biçî mala Qureyze. Ez bi xwe jî qesda wan dikim û ez wan serûbin dikim.

Vêca pêxemberê Xwedê (s.) jî ferman da delêliyekî ku bike gazî û hawar, vêca wî jî wiha banghildêra: Kî bibihîze û îta'et bike, bila nimêja berêvarê nekin heta neçin nav mala Qureyze!

Vêca pêxemberê Xwedê (s.) dakete warê mala Qureyze, bîst û pênç şevan dora wan girt heta ku dorgirtinê ew xistin tengiyê û Xwedê jî tirs avête dilê wan.

## Se'd di bara Xwedê de li gazindan nameyzîne

Mala Qureyze, li ber hukmê pêxemberê Xwedê (s.) hatin, dostên wan Ewsiyan -ne Xezreciyan- mehdera wan kirin. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) got: "Gelî Ewsiyan! Qey hûn qayîl nabin ku zilamek ji we hukim li wan bibire?" Gotinê: Belê. Pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ew jî bila Se'd kurê Mu'az be." Jê re şand ku were, vêca dema hat, zilamên êla wî jê re gotin: Hey Bavê 'Emr! Qenciyê li hevdostên xwe bike. Lewra pêxemberê Xwedê (s.) ev yek sipartiye te, da ku tu qenciyê li wan bikî. Çi dema pir li berê dan, gote wan: Bi rastî li Se'd hatiye birrîn ku ew di bara Xwedê de gazindan negire û Se'd got: Ez hukim li wan dibirim ku: Zilam bêne kuştin, malê wan were pervekirin û zarok û jin dîl werine girtin.

Pêxemberê Xwedê (s.) jê re got: "Te hukmê Xwedê li wan birrî." Ev bi qanûna herbê ya şerîata Cihûyan û bi şerî'eta Tewratê re jî ahengsaz bû. Vêca li mala Qureyze hukmê Se'd kurê Ubade birrî, hate bikaranîn. Êdî Misilman jî ji derba ji pişt ve û ji belavbûna berdîberdana navxweyî piştrast û emîn bûn.

Xezreciyan Selam kurê Ebû Heqîq kuşt, ew ji wan kesan bû ku hevalbend dabûn hev. Ewsiyan jî berê Ke'b kurê Eşref kuştibû. Ew di neyertiya pêxemberê Xwedê (s.) de pêşîvan bû û ji bo dijminahiya wî nav li xelkê dida. Vêca Misilman ji wan

serekên ku li hemberî Îslamê û Misilmanan dahvan vedidan û pêşîvaniya bizavên dijî wan dikirin tenha û rehet dibûn.

### Lêborîna yê ku neheqî kiribû û dayîn ji bo yê ku nedabû

Pêxemberê Xwedê (s.) karwanek şand rexê Necdê û wî jê re Sumame kurê Esad mezinê mala Hanîfe anîn û bi sitûnekî ji yên mizgeftê ve girêdan. Pêxemberê Xwedê (s.) di ber re buhurî û jê re got:

Hey Sumame! Çi li cem te heye? gotê:

– Hey Mûhemmed! Heke tu bikujî, tu dê yekî xwîn lê heyî bikujî. Heke tu qenciyê bikî, tu dê qenciyê li sipasdarekî bikî. Heke tu mal dixwazî, bixwaze, heta tu bivê dê ji te re bête dayîn.

Pêxemberê Xwedê (s.) ew wisan hişt. Piştre careke dî di ber de buhurî û gotê: "Sumameyî berdin." Vêca wan ew serbest berdan.

Sumame, çû nav rezekî xurmeyan ku nêzîkî mizgeftê bû, xwe şûşt, piştre hat Misilman bû û got: Wellahî, li ser erdê rûyekî ku ji rûyê te bêhtir ez jê aciz bûm tunebû, rûyê te bû yê ku herî ez jê hez dikim. Wellahî, li ser erdê dînekî ku ez wekî dînê te lê bi kîn bûm tunebû, dînê te bû dînê ku herî ez jê hez dikim, karwanê te ez girtim, anîme û min qesda 'Umreyê dikir. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) mizgîn dayê û emrê wî kir ku biçe 'Umreyê.

Çi dema Sumame çû nava Qureyşiyan, jê re gotin:

– Hey Sumame! Tu ji dîn derketî. Got:

– Na! Wellahî, ez bi Mûhemmed re Misilman bûm. Na! Wellahî, êdî ji Yemameyê libek genim dê ji we re neyê, heta pêxemberê Xwedê (s.) destûra wê nede. Yemame; wekî embara xwarinê ya Mekkeyê bû.

Vêca Sumame, vegeriya welatê xwe, embargoya xwarinê danî ser Mekkeyê, heta Qureyşî ketin tengiyê û nameyek

nivîsîn, ji pêxemberê Xwedê (s.) re hinartin û wek qenciya li xizman, jê xwestin ku ew nameyekî ji Sumame re bişîne da ku embargoyê ji ser Mekkeyê rake. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) jî wisan kir.

## Lihevhatina Hudeybiyeyê xewna Pêxember û amadeyiya Misilmanan ji bo çûna Mekkeyê

Pêxemberê Xwedê (s.) di xewna xwe de dît ku ew diçû Mekkeyê û Ke'be tewaf dikir; li dora wê digeriya. Vêca hîn Ew (s.) li Medîneyê bû, ev ji hevalên xwe re ragihand. Ew jî pê gelek keyfxweş bûn û zehf kêfa wan jê re hat. Lewra ji mêj de wan Ke'be û Mekke nedîtibûn, dilê wan dibijiya gera li dora Kabeyê.

Ji xwe mihacir, hîn bêhtir bêriya Mekkeyê dikirin. Lewra ew li wirê ji dayik bûbûn û lê mezin bûbûn û wan pir jê hez dikir. Asteng ketibû navbera wan û wê. Vêca çi dema pêxemberê Xwedê (s.) ev ji wan re ragihand, wan ji bo çûna Mekkeyê xwe amade kir û ji bilî kêm kesan tu kes nema.

## Piştî demeke dirêj çûna Mekkeyê

Pêxemberê Xwedê (s.) di Zûlqedeya sala şeşê hîcretê de ji Medîneyê derket û bi qesda 'Umreyê –ne herbê- berê xwe da aliyê Hudeybiyeyê. Pê re hezar û pênçsed kes jî hebûn. Wî (s.) bi xwe re diyarî birin û bi qesda 'Umreyê îhram jî girêdan da ku bi însanan bide zanîn ku ew (s.) ji bo serdana Kabeyê û qedirgirtina wê derketiye rê.

Çavdêrekî wî (s.) hebû, ew jî li pêşiya xwe şand. Wî di bara Qureyşiyan de agahî didanê. Dema Pêxember (s.) giha nêzîkî "Esefanê" çavdêrê wî hate balê û jê re got: Dema min Ke'b kurê Luey hişt û ez hatim, wan ji bo şerê te kom anîbûn ser hev. Ew dê şerê te bikin û dê nehêlin tu biçî Kabeyê.

Pêxemberê Xwedê (s.) meşiya heta li ser aveke hindik, li dûrê Hudeybiyeyê peya bû. Wan jî ji pêxemberê Xwedê (s.) re gilehê tîbûna xwe kir. Vêc wî ji rextê xwe tîrek deranî, piştre

emr da wan ku wî bixin nav avê û av ji wan re herikî heta tevan têr vexwarin û netîn vegeriyan.

Qureyşî tirsiyabûn ku pêxemberê Xwedê (s.) were şerê wan bike. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) xwest zilamekî ji hevalên xwe bişîne cem wan. Gazî Usman kurê Effan kir, şand cem Qureyşiyan û gotê: Ji wan re rabgihîne ku em nehatine şerê wan, tenê em hatine 'Umreyê. Wan vexwîne Îslamê. Ferman lê kir ku here cem zilam û jinên Misilman ku li Mekkeyê mabûn; mizgîniya fetha Mekkeyê bide wan û ji wan re ragihîne ku Xwedê dê dînê xwe li Mekkeyê eşkere bike, heta tu kes li dê îmana xwe veneşêre.

Usman kete rê û meşiya, heta hate Mekkeyê, çû bal Ebûsufyan û giregirên Qureyşiyan û meqsûda ku pêxemberê Xwedê (s.) ew pê şandibû ji wan re ragihand.

Dema Usman mesaja pêxemberê Xwedê (s.) ji wan re ragihand û jê vala bû, jê re gotin: Heger tu bixwazî tewafa Kabeyê bikî, tewafa wê bike. Wî jî gote wan: Heta pêxemberê Xwedê (s.) tewafa wê neke, ez naxwazim tewafa wê bikim.

### Bey'eta/Peymana Ridwanê

Nûçe, ji pêxemberê Xwedê (s.) re hat ku wa ye Usman hatiye kuştin. Vêca ew (s.) li binê darê bû û Misilman gazî peymanê kirin, wan jî soz danê ku ew ji şer nerevin. Pêxemberê Xwedê (s.) bi destê xwe jî girt û got: "Ev jî ji ber Usman ve." Bey'etur-Ridwan li Hudeybiyê, li binê dareke bi stirî pêk hat. Di bara wê de Xwedê ev ayet nazil kir: *"Bêguman Xwedê ji bawermendan razî bûye dema li binê darê peyman dane te."* (Fetih: 18)

Çar qasid di navbera Pêxemberê Xwedê (s.) û Qureyşiyan de çûn û hatin û Pêxemberê Xwedê (s.) ji her çaran re jî got: Em nehatine şerê tu kesî, em hatine 'Umreyê, lêbelê Qureyşî ji rik û serhişkiya xwe nehatin xwarê. Yek ji wan qasidan jî 'Urwe kurê Mes'ûdê Seqefî bû, ew vegeriya cem hevalên xwe û ji wan re got: Gelî hevalan! Wellahî, ez çûme cem padişa-

han; cem Kîsra, Qeyser, Necaşî. Wellahî, min padîşahekî ku hevalên wî qedrê wî digirin bi qasî ku hevalên Mûhemmed qedrê wî digirin nedîtiye, nebînaye. Û salixê ya ku dîtî ji wan re da zanîn.

**Peyman û lihevhatin hostayî û bêhnfirehî**

Piştre Qureyşiyan Suheyl kurê Emr şandin. Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) dît ku va ye ew tê, got: "Qureyşiyan dema ev zilam hinartine wan lihevhatin xwestiye." û Suheyl gotê:

"Nameyekê di navbera me û xwe de binivîse." Pêxember (s.) gazî Elî kir û gotê:

"Binivîse: Bismillahirrehmanirrehîm -Bi navê Xwedayê nihrîbanê dilovîn" vêca Suheyl gotê:

"Herçî Rehman e, wellahî em bi xwe nizanin ka ew çi ye? Lêbelê wekî ku tu dinivîsî "Bismîkellahumme- Bi navê te Xwedayê min!" binivîse.

Vêca Misilmanan got: "Wellahî, em ji "Bismillahirrehmanîrrehîm- Bi navê Xwedayê mihrîbanê dilovîn pê ve nanivîsin. Vêca Pêxember (s.) gotê: "Bismîkellahumme- Bi Navê te Xwedayê min! Binivîse."

Piştre gotê: "Binivîse: Ev ya ku Mûhemmed pêxemberê Xwedê daraz kirî." Suheyl got:

"Wellahî, eger me zanîba birra tu Pêxemberê Xwedê yî, me dê men'a te ji Kabeyê nekirba û me dê şerê te jî nekirba. Lêbelê binivîse: Mûhemmed kurê Ebdullah."

Vêca pêxemberê Xwedê (s.) gotê:

"Çendan hûn min bi derewînin jî, ez pêxemberê Xwedê me. Temam, binivîse: Mûhemmed kurê Ebdullah." Vêca ferman da Elî ku wê jêbibe. Vêca Elî gotê: Na! Wellahî, ez dê wê jê nebim. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) gotê: "Şûna wê şanî min bide." Vêca cihê wê nîşanî wî da, wî jî ew xîç kir.

Vêca pêxemberê Xwedê (s.) got:

"Ev e, ya ku pêxemberê Xwedê li serê daraz kiriye bi şertê ku hûn ji nava me û Kabeyê derkevin û em jî tewafa wê bikin." Suheylî got:

"Wellahî, bila ereb nebêjin ku em ketin tengiyê. Lêbelê binivîse ku ev yek dê di sala werê de were kirin."

Suheyl got:

"Bi şertê ku ji me tu zilam dê neyêne cem Te, çandan li ser dînê te be jî. Tu dê wî li me vegerînî."

Vêca Misilmanan got: "Subhanellah!" Digel ku ew Misilman hatibe jî dê çawa li pûtperestan bête vegerandin. Herwiha ew hîn di navbereke halo de bûn, ji nişka ve Ebû Cendel kurê Suheyl digel qeyd û bendên xwe ji binê Mekkeyê derketibû û hat heta xwe avêt nav Misilmanan. Suheyl gotê:

"Ya Mûhemmed! Ev e yekem tiştê ku ez te li serê dikim hekem ku tu wî vegerînî."

Pêxemberê (s.) gotê:

"Hê me peymenname nekiriye hakim." Suheyl gotê:

Wellahî, naxwe ez te li ser tiştekî nakim hekem.

Pêxember (s.) gotê:

"Belê, min bike hekem." Suheyl gotê:

"Na! Ez te nakim hekem."

Pêxember (s.) gotê:

"Belê. Min bike hekem."

Suheyl gotê:

"Na! Ez te nakim hekem."

Ebû Cendel got: "Gelî Misilmanan! Ez lî pûtperestan tême vegerandin. Haleve ku ez Misilman hatibûm. Qey hûn ya ku ez tûşî wê hatime nabînin?!"

Wî di ber dînê Xwedê de gelek îşkence dîtibû. Pêxemberê Xwedê (s.) ew li pûtperestan vegerand.

Herdu rexan, li ser -danîna şer ji nava xelkê heta deh salan ku di wan de xelk piştrast bibin û şerê hev nekin, li ser ku ji Qureyşiyan kî bêdestûra xwendê xwe were cem Mûhemmed,

ew dê wî li wan vegerîne û ji cem Mûhemmed jî kî were cem Qureyşiyan dê wî lê nevegerînin, kî bixwaze bikeve peyman û ehda Mûhemmed ew dê bikeviyê û kî bixwaze bikeve peymana Qureyşiyan û ehda wan ew dê bikeviyê- li hev hatin.

### Îmtihana Misilmanan di lihevhatinê û vegerîna Mekkeyê de

Çi dema Misilmanan dîtin; tişta ku ji lihevhatin û vegerê û tişta ku pêxemberê Xwedê di dilê xwe de qurpandî dîtin, Misilman ji vê yekê pir bêhnteng bûn; nêz bû ji kerban bibeicin û vê pir têhna xwe li Misilmanan kir. Heta Umer kurê Xettab hate cem Ebûbekir û gotê:

Qey ne Pêxember (s.) ji me re gotibû: "Em diçin Kabeyê û wê tewaf dikin?!"

Ebûbekir gotê:

"Belê, ma ji te re ragihand ku tu dê îsal biçiyê?"

Umer gotê:

"Na!"

Ebûbekir gotê:

"Naxwe tu yê heriyê û wê tewaf bikî."

Çi dema Pêxemberê Xwedê (s.) ji lihevhatinê vala bû, rabû hate cem qurbanê, ew gurand, piştre rûnişt, serê xwe qusand. Ev yek bi ser Misilmanan de gelek mezin û zehmet hat, lewra ew derketibûn û wan di çûna Mekkeyê û 'Umreyê de hîç guman nedikir. Lêbelê dema wan dît ku pêxemberê Xwedê (s.) qurban serjêkir û porê xwe kur kir. Wan ji xwe çenkirin qurbanên xwe serjêkirin û porê xwe kur kirin.

### Lihevhatineke weza yan jî fetheke eşkere

Piştre Pêxember (s.) vegeriya Medîneyê û li vegera wî, Xwedê ev ayeta ha şand: *"Bêguman Me ji te re fetheke eşkere vekiriye, da ku Xwedê li gunehê te yên ku buhurîne û yên ku hê tên bibu-*

*hure, dayîna xwe li ser te timam bike, berê te bide rêya rast û durist û Xwedê arîkariyeke xurt bide te."* (Fetih: 1-3)

Umer gotê:

"Ya Resûlullah! Ma ew feth e?" Gotê:

"Belê."

**"Dibe ku hûn ji tiştekî hez nekin û ew ji we re çêtir be "**

Çi dema Pêxember (s.) vegeriya Medîneyê, ji Qureyşiyan zilamekî navê wî Ebû Besîr, 'Utbe kurê Useyd hate cemê. Vêca Qureyşiyan li pey wî du zilam şandin û gotinê: Em peymana ku te dabû me dixwazin. Vêca ew da wan her duyan û ew bi xwe re birin. Vêca ew ji destê wan derket û bazda, heta hate perava deryayê û Ebû Cendel jî ji nava destê wan xilas bû û ew jî giha Ebû Besîr. Vêca ji Qureyşiyan çi qas zilamek Misilman dibû digiha Ebû Besîr. Heta li dora wî civatek pêk hat. Dema dibihîstin ku wa ye bazirganekî Qureyşiyan çû Şamê diketin pêşiya wî; ew dikuştin û malê wî jê distendin.

Vêca Qureyşiyan ji Pêxember (s.) re xeber şandin û di bara xizimtiyê de ew bi Xwedê didan sondê ku tu kesî neşîne cem wan. Vêca ji Qureyşiyan kê qesda wî dikir ew piştrast dibû.

Bûyerên dawîn nîşan dan ku "Lihevhatina Hudeybiyeyê" ewa ku pêxemberê Xwedê (s.) tê de tawîz dabû ji bo qebûlkirina her tiştê ku Qureyşiyan li berê da û wan tê de ji xwe re serkeftin û berjewendî dîtin û Misilmanan jî bi wê îmana xwe ya xurt û îta'eta xwe ya ji bo Pêxember (s.) daqurpandin, ew bû vekirina deriyekî nû ji bo serkeftina Îslamê û belavbûna wê bi lezeke ku mînaka wê nehatî dîtin ya li girava Erebistanê. Ew bû deriyê vekirina Mekkeyê û gaziya li padîşahên cîhanê: Qeyser, Kîsra, Muqewqis û mîrekên ereban bi bal îslamê ve. Xwedê rast gotiye: *"Dibe ku hûn ji tiştekî hez nekin û ew ji we re çêtir be, dibe ku hûn ji tiştekî hez bikin û ew ji we re nebaş be. Xwedê dizane û hûn nizanin."* (Beqere: 216)

## Misilmanbûna Xalid kurê Welîd û Emr kurê As

Lihevhatina Hudeybiyeyê bû sersebeba fetihkirin û vebûna dilan jî. Xalid kurê Welîd ku şehsiwarê Qureyşiyan û egîdê şerên mezin bû, yê ku Pêxemberê Xwedê (s.) navê wî kire 'Seyfullah-Şûrê Xwedê' ku di bara dînê Xwedê de îmtihaneke baş buhurand û Xwedê li ser destê wî Şam vekir, Misilman bû. Emr kurê As jî ku yek ji fermandarên herî mezin û rêzanan e û piştre bû fatihê Misirê, Misilman bû. Her du piştî "Lihevhatina Hudeybiyeyê" çûne Medîneyê. Misilman bûn û Misilmantiya wan rind bihuriye.

Vê lihevhatinê, firsenda tevlîhevbûna nava pûtperestan da Misilmanan. Vêca pûtperestan gelek rindiyên Îslamê û exlaqê Misilmanan dîtin. Hê saleke temam bi ser vê lihevhatinê re nebuhurî, pir mirov bûn Misilman.

## Vexwendina padîşah û mîran bi bal Îslamê ve vexwendin û hostayî

Çi dema lihevhatin pêk hat û rewş sakin bû, pêxemberê Xwedê (s.) name ji padîşahên cîhanê û mîrekên ereban re da nivîsîn û şand. Tê de bi hîkmet, hostayî û şîretên rind ew vedixwendin Îslamê û rêya Xwedayê xwe û pir girîngî da van cûre nemayan. Ji her yekî ji padîşahan re qasidekî layîqê wan bijart. Jê re (s.) hate gotin: Ew ji bilî nemayên mohrkirî qebûl nakin. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) ji xwe re gustîlkek zîvî da çêkirin û lê "Mûhemmedun Resûlullah" neqş kir.

## Radestbûna Hîreqil ji Îslamê re û jê menbûna wî

Ji van padîşahan yek Împeratorê Romayê Hîreqil/Heraqliyus bû, yek împaratorê Firsê Kîsra Îbrûwîz bû, yek qralê Hebeşistanê Necaşî bû, yek jî Melikê Misrê Muqewqis bû. Herçî Hîreqil/Herakliyus, Necaşî û Muqewqis bûn, wan bi toreyî û bersiveke bi nezaket dan. Hîreqil/Herakliyus xwest di bara Pêxember (s.) de lêkolînê bike û li yekî ku di bara Pêxember

(s.) de wî haydar bike geriya û li Xezzeyê rastî Ebûsufyan hatin ku ew hatibû ticaretê. Ebûsufyan anîn hizûra Hîreqil /Herakliyus, şîroveyên wî -di bara tarîxa dînan, taybetmendiyên pêxemberan û jînenîgariya wan, rewşa milletan bi wan re, qanûna siriştiya Xwedê di bara wan de - şîroveyên mirovê eqilmend, serpêhatî û pispor bû. Rastdêrîna Herakliyus ya Ebûsufyan di bara Erebên pêşîn de ji fihêtiya ku xelk derewan lê bikin, bû.

Çi dema Hîreqil li wan tevan guhdarî kir, bawer kir ku ew pêxemberê Xwedê ye û got: Heke eva ku tu dibêjî rast be, ew dê şûna van her du lingên min jî bi dest bixe. Min zanîbû ku ew dê bête der. Lê min zen nedikir ku ew dê ji we bibe. Heke min zanîbana ku ez ê bigihimê, ezê bi zehmetî bihatama dîtina wî. Heke ez li cem wî bama min dê lingên wî bişûştana.

Piştre destûr da giregirên Romayê, hatin sarayê, bi emrê wî derî girtin, piştre gote wan: Gelî giregirên Romayê! Heke hûn bera xilasî û dewleta xwe dixwazin peymanê bidin vî Pêxemberî (s.) lê wan xwe nedan ber, bi lez bi deriyan ve bezdan da ku derkevin, vêca meyzandin ku wa ye girtî ne. Çi dema Hîreqil nefreta wan dît û ji Misilmanbûna wan hêviya xwe birî, gote wan: Li min vegerin! Û ji wan re got: Min gotina xwe ya nêzîk got, da ku pê semîmiyeta we û xwepêgirtina we ya li ser dînê we biceribînim, min ew dît. Vêca ew jê re çûne sicûdê û jê qayil bûn.

Hîreqil hukumdarî di ser hîdayetê re girt û ew di heyama xelîfetiya Ebûbekir û Umer de di navbera wî û Misilmanan de pevçûn û gelek şer qewimîn û di wan de desthelatî û dewleta wî hilweşiya.

### Toreya Necaşî û Muqewqis

Herçî Necaşî û Muqewqis bûn, wan qedrê qasidên Pêxemberê Xwedê (s.) girtin, bersiveke nazik û şahîk dan. Muqewqis gelek xelat jê re şandin. Ji wan xelatan dudu cariye

bûn ku yek ji wan Mariyeya Qibtî bû û ew bû dayîka Îbrahîm kurê Pêxember (s.).

## Barbarî û hêrsa Kîsra

Herçî Kîsrayê Firsê bû, dema nameya Pêxember (s.) jê re hate xwendin, ew çirrand û got: Ew vê ji min re dinivîse hal ev e ku ew koleyê min e. Vêca ev yek giha Pêxemberê Xwedê (s.) û wî jî got: "Xwedê milkê wî perçe bike!" Kîsra ferman da waliyê xwe yê Yemenê Bazan ku wî bigre û jê re bîne. Vêca wî jî "Babeweyh" şand û jê re digot: Şahînşah-Melikê melikan Kîsra ji melikê me Bazan re name nivîsiye û ferman dayê ku yekî te bibe cemê, bişîne bal te. Vaye ez şandime da ku tu bi min re werî.

Vêca pêxemberê Xwedê (s.) jê re ragihand ku Xwedê kurê wî Şîreweyh raseletî ser wî kiriye. Herwiha qewimîbû jî. Xwedê dewleta wî perçe perçe kir, ew kete bin destê Misilmanan û xelkê Îranê jî Misilman bûn.

Pêxemberê Xwedê (s.) name ji mîrekên Ereban re jî şandin. Vêca ji wan jî hinek Misilman bûn û hinek jî Misilman nebûn.

## Xezweya Xeyberê xelata ji Xwedê

Bêguman Xwedê mizgîniya fetheke nêzîk û xenîmeyên pir da xelkên "Bey'et,ur- Ridwanê" li Hudeybiyeyê û got: *"Bêguman Xwedê ji bawermendan razî bûye dema li binê darê peyman dane Te, ya ku di qelbên wan de bû zaniye, aramî bi ser wan de aniye xwarê, wek xelat fetheke nêzîk û xenîmene pir ku dê wan bigirin da wan. Xwedê zorbir û xwedî-hîkmet e."* (Feth: 18-19)

Destpêka van feth û xenîmeyan jî xezweya Xeyberê bû. Xeyber; koloniyeke Cihûyan bû, ji çend keleh û asêgehan pêk dihat. Ew biryargeha Cihûyan ya şer bû.

Pêxemberê Xwedê (s.) xwest ji wan rehet bibe û ji rexê wan ve jî piştrast bibe. Xeyber li bakûrê rojhilat heftê mîlî dûrê Medîneyê bû.

## Leşkerekî bawermand di binê fermandariya pêxemberekî de

Pêxemberê Xwedê (s.) dema ji Hudeybiyeyê vegeriya Medîneyê, di Zûlhicce û hinekî ji Muherremê jî li wê ma. Piştre di nîvê dî yê Muherremê de derkete rêwîtiya Xeyberê. Amir kurê Ekwe' di rêwîtiya wî de sirûd dixwendin û digot:

"Wellahî! Heke ne ji Xwedê bana, em dê bi ser rê ve nebûbana,

Me dê ne zekat dabana, ne jî me dê nimêj kiribana,

Dema qewmekî neheqî li me kir, heke tevdan bivana, me nedihişt,

Wî aramî bi ser me de anî xwarê û lingên me ji ketinê cihgirtî kir."

Pêxember (s.) digel hezar û çar sed leşkerên xwe berê xwe da Xeyberê, bi wan re dused hesp jî hebûn. Destûr neda yên ku ji Hudeybiyeyê mabûn ku pê re herin xeyberê. Bi Misilmanan re bîst jinên sihabiyan jî derketin da ku nexweşan derman bikin, xizmeta birîndaran bikin û di navbera şer de av û xwarinê bînin û arîkariyê bikin.

Pêxemberê Xwedê (s.) di rê de xwarin xwest, ji bilî poxîn tiştekî dî nehat. Bi emrê wî (s.) ew jî kirin firdik û wî jî xwar û Misilmanan jî xwar. Pêxemberê Xwedê (s.) dema çû raserî xeyberê dua kir, ji Xwedê xêr xwest û ji neqenciya wê û xelkê wê xwe avête ber penaha Xwedê. Pêxember (s.) dema diçû şerê xelkekî, heta nebûbana sibeh şerê wan nedikir. Vêca dema lê dibû sibeh û heke dengê bangê bibihîstana şerê wan nedikir. Heke dengê bangê nebihîstana êrîşî wan dikir. Çi dema sibehê hilat û dengê bangê nebihîst, Pêxemberî (s.) û hevalên xwe siwar bûn û karkerên xeyberê di sibehê de pêşwazî kirin ku

wa ye zembîl û dasên wan bi wan re ne, derhatine. Çi dema wan Pêxemberê Xwedê (s.) û leşker dîtin, gotin: Mûhemmed e û artêş pê re ye. Vêca bi paş ve revîn. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) got: "Ellahû Ekber! Xeyber feth bû, dema em dadikevin qada xelkekî, çi qasî xirab e sibeha hişyarbûyan."

## Serdarekî serkeftî

Pêxemberê Xwedê (s.) xwe berda nav kelehên Xeyberê û yek bi yek dest bi fetha/vekerina wan kir. Yekemîn keleha ku hate vekirin, keleha Na'îm bû, ew li Misilmanan gelekî zehmet û dijwar hat û ji aliyê Elî kurê Ebûtalib ve hate fetihkirin. Wî çaxî çavên Elî kul bûn. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) got: "Yê ku sibê alayê bigre, zilamekî wisa ye ku Xwedê û pêxemberê xwe jê hez dikin. Xwedê dê li ser destê wî (Xeyberê) veke." Sehabeyên mezin xwe bi ser wî de dirêj kirin, her yekî ji wan hêvî dikir ku bibe xwediyê vê (şerefê). Vêca gazî Elî kir, çavên wî diêşiyan, Elî hate cem pêxemberê Xwedê (s.) tif kire çavê wî, jê re dua kir. Vêca çavên wî rehet bûn; her wekî ku ne kul bûn û ala dayê. Vêca Elî gotê:

– Ezê şerê wan bikim heta ew bibin wekî me?

Pêxemberê Xwedê (s.) gotê:

– Li ser şopa xwe biçe heta tu dakevî qada wan. Piştre wan vexwîne Îslamê û ji wan re heqê Xwedê yê ku li ser wan pêdivî ye eda bikin ragihîne. Ez bi Xwedê sond dixwim ku eger Xwedê bi te yekî bîne ser rasterê ew ji te re ji devehên sor jî hê çêtir e.

## Di nava Şêrê Xwedê û Egîdê Cihû de

Elî hate bajarê Xeyberê. Vêca lehengê navdar Merheb, nav di xwe dida û derket pêşiya wî, her duyan derb li hev werkirin. Vêca Elî derbek lê da, kumzirx û serê wî ji cendekê wî pekande erdê û feth pêk hat.

### Hindik kir gelek stend

Koleyekî reşik yê Hebeşistanî ji xelkê Xeyberê li ber pezê xwendê xwe bû. Çi dema dît ku wa ye xelkê Xeyberê rahiştin çekên xwe, ji wan pirsî: Hûn dikin çi bikin? Gotinê: Em dê şerê vî zilamê ku dibêje xebero; ew mêr Pêxember e, bikin. Vêca behsa Pêxember (s.) kete dilê wî û bi pezê xwe ve berê xwe da û hate cem Pêxemberê Xwedê (s.) û jê re got:

– Tu çi dibêjî? Tu doza çi dikî?

– Ez doza Îslamê dikim. Ez te gazî vê dikim ku tu şehde bidî ku ji bilî Xwedê tu îlah tune û ku Ez jî pêxemberê Xwedê me û ku ji bilî Xwedê tu îbadeta tu kesê din nekî.

– Eger ez şehda xwe bînim û îmanê bînim çi ji min re heye?

– Heke tu li ser vê bimrî, ji te re Cennet heye.

Vêca ew kole Misilman bû. Piştre got:

– Hey pêxemberê Xwedê! Ev pez emanet e li bal min.

Vêca pêxemberê Xwedê (s.) jê re got:

– Ji cem xwe derêxe û berê wî bide Hesbayê, Xwedê dê emanetê te ji ber te ve bide.

Vêca wî jî welê kir. Pez li xwendê wî vegeriya. Vêca mêrikê Cihû zaniya ku koleyê wî Misilman bûye. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) rabû nava xelkê şîret li wan kir û ji bo cîhadê nav li wan da. Çi dema Misilman û Cihû bi nav hev ketin, koleyê çerm reş jî di nav kuştiyan de hatibû kuştin. Pêxemberê Xwedê (s.) berê xwe da hevalên xwe û ji wan re got: "Xwedê qedrê vî koleyî girt û ew ajote xêrê, Min li ber serê wî du horî'în dîtin û wî hîç siçûdek nimêj jî ji Xwedê re nekiribû."

### Min ne ji bo vê dabû pey te

Koçerekî Ereb hate bal Pêxember (s.) pê îman anî, da pey û gotê: Ez bi te re hîcret bikim? Vêca Pêxemberî (s.) qewîtiya wî li hin hevalên xwe kir. Çi dema şerê Xeyberê qewimî, pêxemberê Xwedê (s.) pişka wî ya xenîmeyê veqetand. Ew

şivanê heywanên wan yên barhilgir bû. Çi dema ew hat, pişka wî danê. Ji wan re got: Ev çi ye? Gotinê: Ev pişka te ye. Pêxemberê Xwedê (s.) ji te re veqetandiye. Wî rahiştiyê, anî cem Pêxember (s.) û jê re got:

– Ya Resûlullah! Ev çi ye?

– Ew pişkek e, min ji te re veqetandibû.

– Min ne ji bo vê dabû pey te. Lêbelê min da pey te ku tîrek li virê -goriya xwe destnîşan kir- bikeve, ez bimrim û biçim bihiştê.

– Heke tu ji Xwedê re rast bî Xwedê jî dê ji te re rast be.

Piştre rabûne şerê neyaran, ew anîn cem pêxemberê Xwedê (s.) ku wa ye hatiye kuştin.

Ji wan re got:

– Ma ew e? Gotinê:

– Belê, ew e. Got:

– Ew ji Xwedê re rast bû, Xwedê jî jê re rast bû.

Piştre Pêxember (s.) cubbeyê xwe jê re kire kefen, dûvre ew anî pêş, li serê nimêj kir û jê re ev dia kir: "Xwedayê min! Ev bendeyê te di rêya te de wek mihacir derket, bi şehîdî hate kuştin û Ez jê re şahid im."

### Şertê mayîna li Xeyberê

Di pey dorgirtin û şerekî ku çend rojan dom kir de keleh peyapey hatin vekirin. Heta wan li pêxemberê Xwedê (s.) sulh û lihevhatin pêşniyar kir. Pêxemberê Xwedê (s.) bi şertê ku nîvê dexl û fêkiyên xwe bidin Misilmanan Xeyber da wan. Pêxemberê Xwedê (s.) munasib dît ku wan li wirê bihêle. Pêxemberê Xwedê (s.) Ebdullah kurê Rewahe dişand nava wan, berê wan bi hezir dikir du beş û ji wan re digot: Hûn kîjanê bixwazin wê bibijêrin. Wan jî digot: Bi vê (edaletê), erd û asîman ava bûne.

### Hewldanek gunehkariya Cihûyan

Di vê xezweyê de jehr dane pêxemberê Xwedê (s.) ku bûyerê wiha rûda: Zeyneb keça Hers ya cihû jina Selam kurê

Meşkem bizineke biraştî ku wê jehr lê kiribû ji Pêxember (s.) re diyarî kir û pirsî ka ew ji kîjan goştî hez dike? Jê re gotin: Ji zendan hez dike. Vêca wê jî gelek jehr li zendan kir. Çi dema Pêxember (s.) zend hilda devê xwe, zendan jê re ragihand ku ew jehrkirî ye. Wî (s.) jî ji devê xwe avêt.

Pêxember Cihû dane hev, piştre ji wan re got: "Heke Ez tiştekî ji we bipirsim hûn dê ji min re rast bibêjin?" Gotinê: Belê. Ji wan re got: "We jehr kiriye vê bizinê? " Gotinê: Belê. Ji wan re got: "Çi tiştî hûn ajotine ser vê yekê?" Gotinê: Me xwest ku heke tu derewîn bî em ji te rehet bibin, heke tu Pêxember (s.) bî jixwe dê zerarê nede te. Pîrek anîn cem pêxemberê Xwedê (s.) û jê re got: Min xwest te bikujim. Jê re got: "Xwedê dê te musseletî ser min neke." Ji Pêxember (s.) re gotin: Qey em wê nekujin?! Ji wan re got: Na. Ne îşkence lê kir, ne ceza da wê û ew pêşî nekuşt. Lêbelê çi dema Bişr kurê Berra kurê Me'rûr ku ji vê zendê xwarî mir, ew kuşt.

### Xenîme û vegirtin

Pêxemberê Xwedê (s.) piştî karê xeyberê qedand, li Fedekê vegeriya. Piştre hate Wadul-Qurayê, ew vexwendin Îslamê û ji wan re ragihand ku eger ew Misilman bibin, dê malên xwe xilas bikin û xwîna xwe biparêzin û hesabê wan li Xwedê ye.

Pêxemberê Xwedê (s.) ji Fedekê ya ku di destê Cihûyan de bû da wan, Misilmanan bi xenîmetî gelek mal stend. Pêxember (s.) xenîmeyên ku ji Wadul-Qurayê sitendibû li sehabiyên xwe belav kir, zevî û rezên xurman ji Cihûyan re hişt û ew li serê kirin erkdar.

Çi dema Cihûyên Teymayê tifaqa ku pêxemberê Xwedê (s.) bi xelkên Xeyber, Fedek û Wadul-Qurayê re kirî bihîstin, ew jî bi pêxemberê Xwedê (s.) re li hev hatin, ew jî li ser malên xwe mane. Pêxemberê Xwedê (s.) jî vegeriya Medîneyê.

### Qezakirina umreyê

Çi dema sal qulibî, pêxemberê Xwedê (s.) û Misilman di sala heftemînê hîcretê de çûne Mekkeyê. Qureyşî, ji nava wî

û Kabeyê derketin, deriyên xwe radan û derketin serê çiya. Pêxember (s.) sê rojan li Mekkeyê ma, 'umre kir û ev ayeta ha jêdera wê ye: *"Sond be ku Xwedê, xewna pêxemberê xwe bi heqî deraniye. Heke hûn dê bi ewleyî û bêtirs herin Mescîdul-Heramê (menasikên xwe eda bikin). Hin ji we pora xwe tevî biqusînin û hin ji we jî kin bikin. Xwedê ya ku hûn nizanin, dizane. Ha beriya vê fetheke nêzîk da we."* (Feth: 27)

### Pêşbazî ji bo perwerdekirina keçê

Mejî û dilê mirovan bi têhn û bandora Îslamê pir guherîbûn, ew keça ku di heyama cehiliyyetê de, adet ew bû ku dihat kuştin. Êdî ew dihat hezkirin û Misilmanan ji bo xwedîkirin û perwerdekirina wê bi hev re pêşpazî û berberî dikir.

Çi dema Pêxember (s.) kir ji Mekkeyê derkeve, qîza Hemze Emame-yê da pey û wiha gazî dikiriyê: Mamo! Mamo! Vêca ew siparte Elî wî jî rahişt destê wê û ji Fatîmeyê (s.) re got: Keça mamê te sipareya te ye. Wê jî rahiştiyê. Vêca di bara wê de Elî, Zeyd û Cafer bi hev re berberî û keşmekeşî kirin. Elî got: Min ew girt û ew keçmama min e. Cafer jî got: Ew dotmama min e, hem jî xaltiya wê pîreka min e. Zeyd jî got: Ew qîza birayê min e. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) di navbera wan de daraz kir; ew da xaltiya wê û got: "Xaltîk, li şûna dayîkê ye." Ji Elî re got: "Tu ji min î, Ez ji te me." Ji Cafer re jî got: "Hem di exlaq û hem jî di şekil de tu li Min hatî." Ji Zeyd re jî got: "Tu birayê me yî, tu dostê me yî."

### Xezweya Mûteyê kuştin û cezakirina qasidê Misilmanan

Pêxemberê Xwedê (s.) Haris kurê Umeyrê Ezdî bi nameya xwe re şande bal Şerhebîl kurê 'Emrê Xessanî; Waliyê Busrayê, yê ku girêdayê Qeyser împaratorê Romayê bû. Vêca wî ew girêda, piştre ew anî û ser jêkir. Li cem qral û padîşahan kuştina qasid û nûneran nebûbû adet. Di vê yekê de ji bo qasid

û nûnêran xetereke mezin hebû. Ji bo şande û nameyê jî heqareteke tûj hebû. Diviyabû ev bêtoreyê serxweveçû bihatana terbiyekirin.

### Yekemîn leşker li axa Romê

Çi dema ev xeber giha pêxemberê Xwedê (s.) wî xwest cerdekî bi lez bişîne Busrayê. Ev cerd di maha Cemadul-Ewelê, sala heştemîn a hîcretê de şand. Misilmanan xwe kar kir. Ew sê hezar bûn. Pêxember (s.) li ser vê artêşê xizmetkarê xwe Zeyd kurê Harîse kire serdar. Di nava vê artêşê de mezinên mihacir û Ensariyan jî cihê xwe girtibûn. Ji wan re got: "Heke tiştek hate serê wan, bila Cafer kurê Ebûtalib bibe serdarê artêşê, heke tiştek hate serê Cafer bila Ebdullah kurê Rewahe bibe serdar."

Çi dema kar bûn, kirin ku derkevin, xelkê xatir ji serdarên pêxemberê Xwedê (s.) xwest û silav li wan kir. Li pêşiya wan rêwîtiyeke zehmet û dirêj û neyarekî xurt hebû.

Leşker kete rê heta giha Me'anê. Xeber giha Misilmanan ku wa ye Hîreqil digel sed hezar leşkerên Romê li Belqayê ye. Ji Êlên ereb gelek birran xwe dane rex wan, du şevan li Me'anê man. Di bara rewşa xwe de dinêriyan, û gotin: Em ji pêxemberê Xwedê (s.) re nameyekê binivîsin, bişînin û jimara dijminên xwe ragihînin. Vêca yan dê zilaman bi hewara me ve bihinêre, yan jî dê fermana xwe bide me, emê jî fermana wî bînin cih.

### Em ne bi jimar û hêza xwe şerê neyaran dikin

Ebdullah kurê Rewahe nav li xelkê da û ji wan re got: Gelî mirovan! Wellahî, ya ku hûn jê hez nakin ew e ku hûn ji bo wê derketine. Divê hûn şehadetê bixwazin. Em, ne bi piranî, bi jimar û bi hêza xwe şerê dijminan dikin. Lêbelê em, bi vî dînê ku Xwedê pê qedrê me girtiye şerê wan dikin. De kerem kin biçin, ji her du rindiyan her yek para we ye; yan serkeftin e, yan jî şehadet e. Vêca Misilman ketine rê.

### Şerê mirinxwazan û dijwariya neyaran

Çi dema Misilman gihan tixûbê Belqayê, birrên Rom û Ereban rastî wan hatin. Dijmin nêzîk bûn û Misilman gihan gundekî ku jê re "Mûte" dihat gotin. Herdu rex ketin nav hev û li hev dan.

Zeyd kurê Harîse bi alaya ku pêxemberê Xwedê (s.) dabûyê şer kir, heta şehîd ket; rim li her derên wî ketibûn. Piştî wî Cafer rahişt alayê, wî şer kir, heta westiya, xwe ji hespê xwe avêt erdê, hespê xwe kuşt û dest bi şer kir heta destê wî yê rastê jê ket, ala xist destê xwe yê çepê, ew jî jê ket, vêca ala kire nava her du bazindên xwe, heta hate kuştin. Cafer dema şehîd bû emrê wî sih û sê sal bû. Misilmanan di nava sîng û navmilên wî û pêşerexê wî de nod birîn dîtin, hin derbên şûr û hin derbên riman bûn û giş li pêşiya wî ketibûn.

Çi dema Cafer hate kuştin, Ebdullah kurê Rewahe rahişte alayê, hate pêş, ji hespê xwe peya bû, kurapê wî hestiyekî bi goşt dayê û jê re got: Bi vî hestîgoştî ber dilê xwe bigre. Lewra di van rojên xwe de te ya ku dîtî pir zor bû. Wî jî rahiştiyê, hinekî bi devê xwe girt, piştre ji destê xwe avêt û rahişt şûrê xwe, derkete pêş û şer kir, heta hate kuştin.

### Fermandariya Xalid a pisporane

Misilmanan piştî şehadeta Ebdullah kurê Rewahe li ser fermandariya Xalid kurê Welîd tifaq kir. Vêca wî rahişt alayê û berevaniya Misilmanan kir. Xalid, mêrxasekî pispor û zana bû, siyaseta şer xweş zanîbû, berê sipaya Îslamê da rexê başûr, dijmin jî xwe kişand rexê bakur û şev bû reş û tarî. Vêca herdu rexan selametî xenîme jimartin. Xalîd berjewendî di derneketin qada herbê û ne domandina cengê de dît. Romê jî bi saya pisporiya Xalid ji Misilmanan saw girtin û xwe bi paş ve kişandin.

### Xebera dîtinê, ne ya eşkerekirinê

Dema Misilmanan şer dikir, pêxemberê Xwedê (s.) li Medîneyê ji hevalên xwe re ya ku di şer de qewimî ragihand. Enes kurê Ma-

lik dibêje: Bêguman pêxemberê Xwedê (s.) hê berî xeber ji wan re were, xebera şehîdketina Zeyd, Cafer û Ebdullah kurê Rewahe ji sehabiyên xwe re daxuyand. Resûlullah (s.) ji wan re got: "Zeyd rahişt alayê û ew şehîd ket. Piştre Cafer rahiştiyê ew jî şehîd ket, piştre Kurê Rewahe rahiştiyê, ew jî şehîd ket heta şûrekî ji şûrên Xwedê rahiştiyê û Xwedê li ser wan vekir." (Dema ev yek digot;) herdu çavên wî hêsir dikirin.

### Firokê duper

Pêxemberê Xwedê (s.) di bara Cafer de got: "Xwedê di şûna her du destên wî de du bask danê, li bihiştê dera ku dilê wî bixwaze bi wan difire." Ji ber vê yekê jê re Caferê Teyyar (firok) û xwediyê du peran hatiye gotin.

### Dubarok in ne revok in

Çi dema artêş giha dorhêla Medîneyê, pêxemberê Xwedê (s.) û Misilman çûne pêşwaziya wan. Misilmanan ax davêtin ser leşker û ji wan re digotin: Revokno! We ji rêya Xwedê bazda. Pêxemberê Xwedê (s.) jî ji wan re digot: "Ew ne revok in, lêbelê Xwedê hez ke, ew dubarok in."

### Binehaziriya fetha Mekkeyê

Çi dema fermana Xwedê di bara dînê wî û evdên wî de pêk hat, xwest ku qasidê wî û Misilman biçin Mekkeyê, Kabeyê ji pût û seneman paqij bikin, ew bimbarek bibe, ji xelkê re bibe rêber û Mekke li raberiya xwe vegere; bibe ewlegeh û stargeha xelkê.

### Mala Bekir û Qureyşiyan peyman şikandin

Xwedê ji bo fetha Mekkeyê sedem amade kirin. Qureyşiyan jî hevkariya vê yekê kir.

Di Sulha Hudeybiyeyê de biryar hatibû dayin ku kî bixwaze, bikeve peyman û ehda pêxemberê Xwedê (s.) dê bikeviyê.

Kî jî bixwaze bikeve peyman û ehda Qureyşiyan dê bikeviyê. Mala Bekir ketin peymana Qureyşiyan û Xuza'î jî ketin peymana pêxemberê Xwedê (s.)

Di nava Mala Bekir û Xuzaiyan de neyartiyeke ji bav û kalan ve hebû. Îslam hat, perde danî nav wan. Xelk bi Îslamê lebikîn. Çi dema aştî pêk hat, Mala Bekir xwestin vê fersendê bi kar bînin, da ku heyf û tola xwe ya kevnare ji Xuzaiyan hilînin. Vêca çend kesên Xuzaî bi şev li ser ava xwe bûn. Çend kes ji mala Bekir bi şev nagehan avêtin ser wan, çend zilam ji wan kuştin. Êdî ew ketin nav hev û li hev dan.

Qureyşiyan, bi çekan arî mala Bekir kir, çend giregirên Qureyşî bi dizîka di şevê de li mala xuza'iyan dan, heta xuza'î mecbûr kirin ku xwe bavêjin ber Heremê. Çi dema ew gihan bal Heremê, mala Bekir ji hin mêrên xwe re gotin: Em ketin Heremê, bi Xwedayê xwe kî! bi Xwedayê xwe kî! Bes e. Lêbelê hin ji wan got: Gelî mala Bekir! Îro, bi Xwedê kî nîn e. Tola xwe bistînin, hûn dê piştî vê gavê, êdî vê fersendê nebînin.

## Hawar gihandin Pêxember

Emr kurê Salimê Xuzaî derket, çû Medîneyê cem Pêxember (s.) li cemê sekinî, çend malik hûnandibûn, di wan de ew peymana ku di nav Pêxember (s.) û Xuzaiyan de heyî tanî ziman, arîkarî û hawar jê dixwet û jê re ragihand ku Qureyşiyan soza ku dabûnê neanîne cih, wan peymana asê şikandiye û bi şevê, li ser ava wan bi ser wan de girtine û di rikû' û sicûdê de ew kuştine. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) jê re got: "Emr kurê Salim! Arîkariya te hat kirin."

## Hewldana Qureyşiyan ji bo nûkirina peymanê

Dema xeber giha pêxemberê Xwedê (s.) ji xelkê re got: "Her wekî ku Ebûsufyan tê cem we da ku peymanê girêbide û dema wê zêde bike." Her wisan bû, Qureyşî ji kirina xwe tirsiyan.

**Pêxember di ser bav û zaroyan re girtin**

Ebûsufyan hate Medîneyê cem pêxemberê Xwedê (s.) çû mala qîza xwe Ummuhebîbeya ku pîreka Pêxember (s.) bû. Çi dema çû mala wê, kir ku li ser cilika Pêxember (s.) rûne, ji bin wî kişand. Vêca Ebûsufyan jê re got:

– Qîza min! Ez nizam ka tu min layîqî wê nabînî, yan jî wê layiqî min nabînî?!

Jê re got:

– Na, ew cilika pêxemberê Xwedê (s.) ye, tu pûtperest û gemar î, ez naxwazim tu li ser cilika pêxemberê Xwedê (s.) rûnê.

Vêca wî jê re got:

– Qîza min! Wellahî di piştî min de neqenciyê bi te ve daye.

**Sergeşteyî û çûnûhatina Ebûsufyan**

Ebûsufyan çû cem pêxemberê Xwedê (s.) pê re axivî. Pêxember (s.) tu bersiv lê venegerand. Piştre çû bal Ebûbekir, pê re axivî da ew bike ku pêxemberê Xwedê (s.) bi wî re bipeyive. Vêca Ebûbekirî jê re got: Ez nakim. Vêca ew ji bo vê yekê li Umer, Elî û Fatîmeyê geriya, lêbelê tu kesî ji wan ew bersiv nedayê û gotinê: Rewş ji wê mezintir e. Paşîkê Ebûsufyan sergeşte ma.

**Amadeyî ji bo Mekkeyê**

Pêxemberê Xwedê (s.) ferman da xelkê ku xwe kar bikin. Pêşî rewş li wan eşkere nekir, piştre bi xelkê da zanîn ku ew dê biçe Mekkeyê. Ferman da wan ku xwe tam amade û kar bikin û got: "Xwedayê min! Çavdêr û agahiyan ji ber Qureyşiyan bigre, heta em ji nişka ve wan li welatê wan bigirin."

Pêxemberê Xwedê (s.) di meha Remezanê, serê sala heştemîn a hîcretê de digel deh hezar leşker ji Medîneyê derket. Pêxemberê Xwedê (s.) meşiya heta giha "Merizzehran" Xwedê çavên Qureyşiyan ji agahî û xeberan kor kir û ew bi tirs û çavlirê bûn.

### Lêborîn li yê ku zulim kiribû

Pêxemberê Xwedê (s.) di rê de çav bi kurapê xwe Ebûsufyan kurê Haris kurê Ebdulmuttelib ket, bêzî jê kir, ji ber ku pir ji wî êş û tehlî dîtibû. Ebûsufyanî ev yek ji Elî re got. Vêca Elî jê re got: Ji rexê pêş ve here cem pêxemberê Xwedê (s.) û tişta ku birayên Yûsuf jê re gotin, tu jî jê re bibêje: *"Ez bi Xwedê kim, Xwedê tu di ser me re girtî û em şaş bûn."* (Yûsuf: 91) Lewra ew ne razî ye ku ji aliyê gotinê ve kes ji wî sipehîtir be. Wî jî wilo kir. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) jê re got : *"Îro lewme li we nîn e. Xwedê dê li we bibuhure. Ew e dilovînê dilovanan."* (Yûsuf: 92) Piştî vê Misilmantiya wî rind jî buhurî. Lê ji dema Misilmanbûyî û pê de ji fehêtiya xwe hîç serê xwe li cem Pêxemberî (s.) ranekir.

### Ebûsufyan kurê Herb, li ber destê Pêxember e

Pêxemberê Xwedê (s.) ferman da leşker ku agir pêxin. Ebûsufyan kurê Herb derketibû, xeberan bibhîze û digot: Min hiç wekî îşev ne leşker dît, ne jî agir. Ebbas kurê Ebdulmuttelib beriya vê digel malbata xwe ji Mekkeyê derket, Misilman bûbû, hîcret kir û beşdarî leşker bû. Wî dengê Ebûsufyan nas kir û got: Ev Resûlullah e, digel Misilmanan e, li benda sibehê ye. Da ku werê Qureyşiyan! Wî li pişt xwe, li hêstira (qantira) xwe siwar kir, lewra endîşe dikir ku yek ji Misilmanan bigihiyê û wî bikuje. Bi vî awayî Ebbas ew anî cem pêxemberê Xwedê (s.).

Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) ew dît, gotê:

– Wey li te be, ey Ebûsufyan! Qey dema vê nehatiye ku tu bizanî; ji bilî Xwedê tu îlah tune?!

Jê re got:

– Dê-bavê min bi gorî te bin! Tu çiqas bêhnfereh î, çiqas camer î. Çiqas xatirnasê xizmên xwe yî! Wellahî, ez dibêm qey ku digel Xwedê xwedayekî dî hebûya, dê tiştek ji min re bikira.

Jê re got:

– Wey li te be, hey Ebûsufyan! Qey dema ku tu bizanî ez pêxemberê Xwedê me nehatiye?!

Jê re got:

– Dê-bavê min bi qurbana te bin! Tu çiqas helîm î. Çiqas camêr î. Çiqas tu ji mirovên xwe re bi dewlet î! Herçî ev e, ez bi Xwedê kim; di nefsa min de heta vêga jî, hêjî tiştek heye.

Ebbas ji Ebûsufyan re got:

– Wey xwelî li te be! Hê berî serê te were jêkirin. Misilman bibe, şehde bide ku ji bilî Xwedê tu îlah tune ne û Mûhemmed jî pêxemberê wî ye.

Vêca Ebûsufyan Misilman bû û bi heqî şehda xwe anî.

### Efwa 'am û tam/lêborîna giştî asayîşa dorfereh

Pêxemberê Xwedê (s.) efû û asayîş berfireh kir, heta ku ji xelkê Mekkeyê tu kes neyê kuştin. Ji bilî yê ku aştiyê neve û ji heyatê hez neke. Vêca Pêxember (s.) got: "Kî here mala Ebûsufyan ew efûkirî ye. Kî deriyê xwe li xwe bigre ew efûkirî ye. Kî biçe mizgeftê ew efûkirî ye."

Pêxember, di ketina Mekkeyê de ji bilî yê ku were hemberî wan û li ber wan rabe, karanîna çekê li leşkerê xwe qedexe kir. Ferman da ku dest nedin malên xelkê Mekkeyê û xwe jê dûr bigirin.

### Ebûsufyan li pêşberî karwanê fethê

Pêxemberê Xwedê (s.) ferman da Ebbas kurê Ebdulmuttelib ku Ebûsufyan li cihê ku birrên îmanê tê re dibûrin, rûnenê. Karwanên fethê mîna pêlên behrê liviyan. Her êl bi alaya xwe dibûrîn. Çiqas êlek dibûrî, Ebûsufyan ew û navê wê ji Ebbas pirs dikir. Vêca digot: Çi karê min û mala filankes bi hev re heye. Hetanî pêxemberê Xwedê (s.) di nav qafileyeke mezin de ku mihacir û ensarî jî tê de bûn, buhurî. Ji wan tenê reşahiya wan wekî wê reşahiya girovera ku di nîvê çav de dixuya dihate dîtin. Vêca got:

– Subhanellah! Hey Ebbas, kî ne ewên han!

– Evê ha Pêxember e (s.) di navbera mihacir û Ensariyan de ye.

– Hey bavê Fedil! Tu kes bi van nikare. Sibê dewleta biraziyê te dê mezin bibe.

– Hey Ebûsufyan! Ew Pêxember (s.) e.

– Naxwe, belê.

Ebûsufyan rabû bi dengê xwe yê bilind bang kir: Gelî Qureyşiyan! Va ye Mûhemmed (s.) hate we, qeweta we jê re nîn e. Vêca kî bikeve mala Ebûsufyan ew ewle ye.

Gotinê:

"Malavo! Qey mala te têrî me dike?"

Got:

"Kî deriyê xwe li xwe bigre, ew ewle ye. Kî biçe mizgeftê ew ewle ye."

Vêca xelk ji balê veqetiyan; çûne malên xwe û mizgeftê.

**Ketina nefspiçûkî; ne ketina dagirkerê nefsmezin**

Pêxemberê Xwedê (s.) serê xwe ji Xwedê re nizm kir û wilo kete Mekkeyê. Dema ew fetha -ku Xwedê pê qedrê wî girtiyedît, nêzîk bû ku erzana wî bigihê nîvê deveha wî. Wî sûretê Fetih dixwend û kete Mekkeyê.

Pêxemberê Xwedê (s.) dema Mekke fetih kir, li wê hemû dirûşm û sembolên dadmendî, wekhevî û dilnizmiyê bilind kirin. Wî (s.) digel ku ew îro pir bûn jî, ne kurek ji kurên Mala Haşim û ne jî kurek ji kurên giregirên Qureyşiyan da pey xwe. Lêbelê wî (s.) Ûsame kurê Zeyd da pey xwe.

Fetha Mekkeyê, di sibeha roja înê, bîstê meha Remezanê, sala heştemîna hîcretê de pêk hat. Roja vekirina Mekkeyê zilamek bi Pêxember (s.) re axivî, jê saw girt. Vêca Pêxember (s.) jê re got: "Rehet bibe! Ez ne padişah im, ez kurê jineke Qureyşî me ku wê goştê li ber tavê hişkkirî dixwar."

### Merhemet e, ne talan e

Çi dema Se'd kurê Ubade di nava qafileya Ensariyan de di ber Ebûsufyan re bihurî. Jê re got: Îro roja talanê ye; îro qedexe dê bêne serbestkirin, îro, Xwedê dê Qureyşiyan rezîl û riswa bike. Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) bi qafileya xwe re giha dehma Ebûsufyan, wî jê re gilehê wê gotinê kir (û jê re) gotê: Çima ya Resûlullah! Qey te tişta ku Se'd got nebihîstiye? Jê re got: "Wî çi gotiye?" Jê re got: Wiha û wiha gotiye.

Vêca pêxemberê Xwedê (s.) gotina Se'd red kir û got: "Na! Îro, roja merhemetê ye. Îro ew roj e ku Xwedê dê Qureyşiyan ezîz bike. Xwedê dê di îro de Kabeyê mezin bike."

Pêxember (s.) ji Se'd re şand, ala ji destê wî girt û da kurê wî Qeys. Vêca bi vî awayî, wî xwe ezilkirî nedît. Belkî; dît ku waye ala ji destê Se'd nehatiye girtin, lewra ew gihabû lawê wî.

### Hin şerên biçûk

Hin şerên biçûk di navbera Sefwan kurê Umeyye, Îkreme kurê Ebûcehîl û Suheyl kurê 'Emir û navbera hevalên Xalid kurê Welîd de rûdan û nêzî diwanzdeh zilam, ji pûtperestan hatin kuştin. Piştre ew bezîn. Jixwe pêxemberê Xwedê (s.) ferman dabû leşkerên xwe ku dema ew biçin Mekkeyê; ji bilî yên ku şerê wan bike, ew şerê tu kesê din nekin.

### Paqijkirina Heremê ji pût û seneman

Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) peya bû, xelk aram û sakin bûn. Ew derket çû Kabe tewaf kir. Kevanek di destê wî de bû. Li ser ban û hawîrdora Kabeyê sêsed û şêst pût hebûn. Wî (s.) kevanê xwe li wan dida û digot: "Heq hat, batil pûç bû, bêguman batil yê çûnê bû. Heq hat, batil, ne tê, ne jî vedigere." Pût jî bi ser rûyên xwe de diketin erdê. Pêxember li Kabeyê wêne û peyker dîtin, vêca bi fermana wî ew wêne û peyker hatin şikandin.

## Îro, roja camêrî û wefadariyê ye

Çi dema Pêxember (s.) tewafa xwe temam kir, gazî Usman kurê Telhe kir, kilîta Kabeyê jê sitand, wî jî jê re derî vekir. Pêxember (s.) berî hîcretî Medîneyê bike bi rojekê, kilîta Kabeyê jê xwestibû, wî gotineke sitûr û tûj jê re gotibû, dijûn kiribûnê. Pêxember (s.) bêhna xwe lê fireh kiribû û jê re wiha gotibû:

"Hey Usman! Dibe ku tu vê kilîtê rojekê di destê min de bibînî. Vêca dera ku ez bivêm deynim wê derê."

Wî jî jê re gotibû:

"Wê rojê Qureyşî mirî û reben bûne."

Vêca Pêxemberî (s.) jê re gotibû:

"Na! Wê rojê zindî û ezîz bûne."

Ew gotina wî di dilê Usman kurê Telhe de rûniştibû û ji wî were ku rewş dê bigihîje tişta ku Pêxember (s.) gotibû.

Çi dema Pêxember (s.) ji Kabeyê hate der, Elî kurê Ebûtalib rabû pêşiya wî û kilîta Kabeyê di destê wî (s.) de bû. Wî ji Pêxember (s.) re got: Perdekirina Kabeyê û ava heciyan bide me. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) got: "Usman kurê Telhe li ku derê ye? " Vêca gazî wî kirin, ew hat, Pêxember (s.) jê re got: "Hey Usman! Raje kilîta xwe. Îro; roja camêrî û wefadariyê ye, wê heta hetayê wek mîratxwerî bigire. Ji bilî yê zalim tu kesek dîtir dê wê ji we nastîne."

## Îslam, dînê yekdêrîn û yekîtiyê ye

Pêxemberê Xwedê (s.) deriyê Kabeyê vekir. Qureyşiyan mizgeft tije kiribûn, sef bi sef vewesta bûn, çavlibenda tişta ku dê were kirin bûn. Vêca Pêxember (s.) bi herdu rexên darî yên derî girt, Qureyşî jî di bin re bûn û got: "Xwedê yek e, ji bilî wî tu îlah tune, tu hevparên wî jî tune, wî soza xwe anî cih, alî bendeyê xwe kir û wî bi tenê hevalbend bezandin (şikandin). Heyhê! Her qaretî, mal û xwîn (yên serdema cahiliyyetê ewên

ku xelk wan ji hev hîkaye dikin) ew di binê van herdu lingên min de ne. Ji bilî xizmeta Kabeyê û avdana Heciyan. Gelî Qureyşiyan! Xwedê ji we quretiya cahiliyyetê; xwemezinkirina bi bapîran bir. Însan ji Adem in û Adem jî ji axê ye."

Piştre jî ev ayeta ha xwend: *"Gelî mirovan! Me, hûn ji mêr û jinekê xuliqandine, me hûn kirine gel bi gel û êl bi êl da ku hûn (mafên) hev nas bikin. Bêguman li cem Xwedê giranbihatirînê we, xweparêztirînê we ye. Bêguman Xwedê zana û agahdar e."* (Hucûrat: 13)

### Pêxemberê hezkirinê, qasidê merhemetê

Piştre pêxemberê Xwedê (s.) got:

– Gelî Qureyşiyan! Hûn dibêjin qey ez dê çi ji we bikim?

– Qenciyê. Tu birayekî cemêr î û kurê birayekî ciwanmêr î.

– Ez jî -wekî Yûsuf ji birayên xwe re gotî -ji we dibêjim: *"Îro, li we lewme nîne."* (Yûsuf: 92), de kerem kin; biçin, hûn serbest in."

Pêxemberî (s.) emr da Bilal ku hilgire û li ser banê Kabeyê bang bide. Serek û giregirên Qureyşiyan guhdarî dikir û gotina Xwedê bilind dibû, ji ber dengê bangê zingênî bi Mekkeyê diket. Pêxemberê Xwedê (s.) çû mala Umu Hani'ê qîza Ebûtalib, xwe şûşt û wek şukir ji Xwedê re heşt rekat nimêja fethê kir.

### Di tetbîqkirina qanûnên Xwedê de cudahî nîne

Di vê herbê de, bi navê Fatîmeyê jinekê ji mala Mexzûm dizî kir. Vêca êla wê tirsiyan, ji bo qedrê wî yê ku li cem pêxemberê Xwedê (s.) heyî xwe avêtin Ûsame kurê Zeyd da ku mehdera wê bike. Çi dema ew bi pêxemberê Xwedê (s.) re peyivî, rengê rûyê wî (s.) guherî û gotê:

"Tu di bara cezayekî ji cezayên ku Xwedê ew danîne de bi min re dipeyivî ha?!"

Ûsame gotê:

Ya Resûlullah! Ji Xwedê lêborîna gunehên min bixwaze.

Çi dema bû êvar, pêxemberê Xwedê (s.) rabû, peyivî, sena û pesnê Xwedê bi tişta ku layiqî wî bû, da. Piştre got: "Piştre... Ew mirovên beriya we bes; ji ber ku dema ji wan yekî malmezin dizî dikir dev jê berdidan û dema ji wan yê qels dizî dikir ew ceza dikirin, helak bûn. Ez bi wî kim ku nefsa Mûhemmed bi destê wî ye, heke Fatîmeya qîza Mûhemmed jî diziyê bike, destê wê dê were jêkirin."

Piştre pêxemberê Xwedê (s.) ferman kir ku wê jinê bînin, destê wê hat jêkirin. Piştî vê wê tobe kir û tewbeya wê bi rindî buhurî jî.

### Ji bo Îslamê peyman

Xelk, li Mekkeyê gihan hev da ku ji bo Îslamê bey'et û peymanê bidin pêxemberê Xwedê (s.) vêca Pêxember (s.) li ser Sefayê rûnişt û li ser vê yekê ji xelkê bey'et û peyman stand ku ew: Bi ya Xwedê û Pêxemberê wî bikin û li wan guhdarî bikin heta karibin.

Çi dema Pêxember (s.) ji bey'eta zilaman vala bû, bi pîrekan re jî bey'et kir. Di navbera wan jinên ku bey'et kirin de Hind qîza 'Utbe jina Ebûsufyan jî hebû, wê ji ber wê kirina xwe ya bi Hemze, xwe nixumandibû da ku neyê naskirin. Lêbelê pêxemberê Xwedê (s.) ew bi peyva wê ya mêrane nas kir. Ew jî Misliman bû û peyman da Pêxemberê Xwedê.

### Saxiya min li cem saxiya we ye mirina min jî li cem mirina we ye

Çi dema Xwedê li ser destê pêxemberê xwe Mekke fetih kir/vekir ku ew welatê wî, zayîngeha wî û cih û warê wî bû. Ensariyan di navbera xwe de ji hev re peyivîn û gotin: Xwedê li ser destê pêxemberê xwe, axa wî û welatê wî vekir. Vêca ew dê lê bimîne û dê venegere Medîneyê.

Pêxemberê Xwedê (s.) ji Ensariyan pirsa peyva wan kir ku ji bilî wan tu kesî pê nizanîbû. Wan fehêt kir, piştre li ber peyiva xwe hatin. Vêca Pêxember (s.) ji wan re got: "Me'azellah! (Xwedê hefza me jê bike), jiyana min li cem jiyana we ye, mirina min jî li cem miriyên we ye."

### Rakirina berhemên cahiliyyetê û nîşanên pûtperestiyê

Pêxemberê Xwedê (s.) cerdên xwe şande pûtên ku li dorhêla Kabeyê bûn, ew tev şikandin ku yek ji wan Lat bû, yek Uzza bû, yek Menatê sêyem yê dîtir bû. Delêliyê wî li Mekkeyê bang kir: Kî îmanê bi Xwedê û roja dawîn bîne, bila pûtan li mala xwe nehêle, bila wan bişkîne. Pêxemberî (s.) hin zilam ji hevalên xwe şandin nav êlan û pûtên wan şikandin.

Pêxemberê Xwedê (s.) rabû, li Mekkeyê xutbeyek xwend û rêz û hurmeta Mekkeyê ya hetanî roja qiyametê wiha banghildêra: "Ji bo mirovekî ku îmanê bi Xwedê û roja dawîn bîne ne helal e ku xwînekê lê birijîne, yan jî darekê lê bibire" wiha pê de çû û got: "Ji tu kesê, berî min re helal nebûye û piştî min jî dê ji tu kesî re helal nebe." Piştre berê xwe da Medîneyê û vegeriya wê.

### Têhna fetha Mekkeyê

Fetha Mekkeyê bandoreke zêde li dilê Ereban kir, Xwedê dil û sînga gelekan ji wan ji Îslamê re vekir, ew peyapey û kom bi kom diketin Îslamê. Xwedê rast gotiye: *"Dema arîkariya Xwedê û fetih hat û te dît ku wa ye mirov birr bi birr dikevin dînê Xwedê, hingê bi hemdê Xwedayê xwe pak bidêre û lêborîna xwe jê bixwaze. Lewra ew tobepejrên e."* (Nesr: 1-3)

### Xezweya Huneynê kombûna Hewezan

Piştî fetha Mekkeyê xelk birr bi birr ketin dînê Xwedê; Misilman bûn. Ereban ji rextê xwe tîrê xwe yê dawîn jî avêtin Îslamê û Misilmanan. Piştî Qureyşiyan, êla herî xurt û bi hêz

Hewezan bû. Di neqebeyna wê û Qureyşiyan de berberî û reqabet hebû. Vêca wê xwe ji dînê ku Qureyşiyan xwe jê re tewandî re netewand.

Malîk kurê 'Ewfê Nesrî, serekê êla Hewezan rabû banga şer kir, digel Hewezan, seqîfan jî tevan xwe li dora wî dane hev û bi hev re meşiyane cem pêxemberê Xwedê (s.). Wan digel zilaman, mal, jin û zarokên xwe jî ajotin da ku li cihê xwe sabit bimînin û berevaniya malbat û namûsa xwe bikin.

Pêxemberê Xwedê (s.) digel du hezar ji xelkê Mekkeyê derket, hin ji wan ji nêz ve Misilman bûbûn, hin ji wan jî hê Misilman nebûbûn û deh hezar hevalên wî pê re ji Medîneyê jî derketibûn, jimara wan giha mîqdarekî ku di tu şeran de beriya wê hîç negihabûyê. Heta hinek ji Misilmanan got: Îro ji ber hindikahiya xwe em dê têk neçin. Piraniya jimara wan ew devqîç û ecêbmayî hişt.

### Li newala Huneynê

Misilmanan, di dehê Şewalê, sala heştemîn a hîcretê de berê xwe dane newala Huneynê û di tarîtiya berî sibehê de xwe berdanê. Hewezan berî wan hatibûn newalê û li devtengên wê kemîn li ber wan danîbûn. Vêca wan tîr li Misilmanan barandin, şûr ji kalanan kişandin û wekî yek zilamî xwe di wan wer kirin. Jixwe ew qewmekî tîravêj bû.

Piraniya Misilmanan dane xwe, bi şûn de vegeriyan û tu kes ji wan li benda tu kesî nema. Ew pêvajoyeke vebirî bû, nêzîk bû felek li Misilmanan bigeriyana û piştî vê hîç ew neyêne ser xwe, ew jî felaketeke mîna felaketa ku roja Uhudê hatibû serê wan bû; dema li nav Misilmanan hate belavkirin ku Pêxember (s.) hatiye kuştin û Misilmanan xwe vekişandin.

### Feth û aramî

Çi dema Xwedê ya ku xwestî pêk hat ku torekirina wan Misilmanan bû ewên ku bi piraniya xwe serxweve çûn û Xwedê piştî şîraniya fethê tehliya têkçûnê bi wan da tamkirin.

Vêca felek li serê dijminên wan gerandin û aramî û sikûnet ji Pêxemberê (s.) xwe û bawermendan re şand. Pêxemberê Xwedê (s.) li cihê xwe sekinî bû, li ser hêstira xwe ya sipî bû, ne sawgirtî bû û ne jî bi tirs bû. Bi Pêxember (s.) re xelkê mala wî, Ebbas kurê Ebdulmuttelib û çend kes ji mihacir û Ensariyan mabûn. Ebbas bi hevsarê qantira wî girtibû û pêxemberê Xwedê (s.) digot: "Ez Pêxember im, ev ne derew e. Ez kurê Ebdulmuttelib im."

Çi dema qeflên pûtperestan hatin pêşiya Pêxember (s.) wî rahişt çengek ax û ji dûr ve avêt çavên neyaran û çavên wan tije kir.

Çi dema pûtperest bi xwe lebikîn, Pêxember (s.) ji Ebbas re got: "Hey Ebbas! Bangke: Gelî Ensariyan, gelî xwediyên rojên zehmet û giran!" Vêca wan jî bersiva wî dan; ha libbê, ha libbê -ew zilamekî dengbilind bû- zilaman qesda deng dikir, xwe ji ser pişta devehê davêt û bi şûr û mertal xwe digirt heta digiha pêxemberê Xwedê (s.) û êdî li hawîrdora wî komek amade bû, berê xwe dane pûtperestan, şerê wan kirin û Pêxember çû raserî wan li ser zengûya xwe şer germ û dijwar bû.

Êdî deng ji ber têkçûna wan nehat heta pir êsîr li cem pêxemberê Xwedê (s.) dîtin. Xwedê milyaket şandin arî wan. Vêca newal ji wan tije û mişt bû û têkçûna Hewezaniyan misoger bû. Ev jî gotina Xwedê ye ku dibêje:

*"Bêguman Xwedê li cihne gelek û roja Huneynê jî arî we kir. Dema piraniya we, hûn ecêbmayî hiştin. Vêca wê bi tu tiştekî kar neda we û erd digel firehiya xwe jî li we teng bû. Piştre we bi pişt xwe ve bazda. Piştre Xwedê aramiya xwe ji pêxemberê xwe û bawermendan re şand û leşkerin ku we ew nedidîtin jî bi hawara we ve şandin. Û ewên ku bûbûn kafir dane êşandin; ev jî cizayê kafiran e."* (Tewbe:25-26)

### Xezweya Taîfê qefleyên Seqîf

Qefleyên Seqîfiyan hatin Taîfê û li xwe dergehên bajarê xwe girtin/radan, xwe avêtin kelehên xwe û bi xwe re tişta ku hetanî salekê bi kêrî wan were birin nava kelehên xwe

û kara şer kirin. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) ber bi wan ve çû heta li nêzî Taîfê peya bû, leşkerê xwe bi ser wan ve ajot. Leşker nêzîkê dîwarên Taîfê bû lê nekarîn biçine navê. Lewra dergehên bajêr li ser xwe girtibûn û Seqîfiyan bi dijwarî tîr avêtin Misilmanan. Her wekî ku lingên kulihan bin. Jixwe ew tîravêj bûn.

### Dorgirtina Taîfê

Leşker cihê xwe veguhast û bîst û çend şevan dora wan girt û bi dijwarî şerê wan kir. Herdu rexan tîr li hev dibarandin. Pêxemberê Xwedê (s.) di vê dorgirtinê de cara yekem mencenîq bi kar anî û dorgirtin dijwar bû. Hin zilamên Misilman bi tîran hatin kuştin.

### Li meydana şer merhemet

Çi dema dorgirtin tengbû û şer demdirêj bû, pêxemberê Xwedê (s.) ferman da ku mêwên Seqîfiyan bibirin ku wan jiyana xwe bi mêwan didebirand. Misilman ketin nav rezên wan û birîn û wan ji Pêxember (s.) xwest ku ji bo xwedî û xizimtiyê wan nebire. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) got: “Ez ji bo Xwedê û xizimtiyê wan nabirim.” Delêliyê pêxemberê Xwedê (s.) bang kir: Kîjan mirov ji kelehan were der û ber bi me ve were, ev serbest û azad e. Vêca çend zilam derketin û bi bal wan ve çûn.

Fetha Taîfê bi dest pêxemberê Xwedê (s.) ve nehat, vêca emir da Umer kurê Xettab ku bang bike Misilmanan ku koça xwe bar bikin. Misilman jî ji vê yekê hêrs bûn û gotin: Hê me Taîf venegirtî em dê koça xwe bar bikin. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) ji wan re got: “Naxwe de herin şer!” Ew jî çûn şer û çend birîn di Misilmanan de vebûn. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) got: “Xwedê hez ke sibê emê vegerin wan.” bi vî awayî ew jî kêfxweş bûn.

### Rakirina dorgirtinê

Fetha Taîfê bi dest Pêxemberê Xwedê (s.) ve nehat û Xwedê xwest ku ew bi dilên xwe Misilman bibin. Vêca wî jî destûr da hevalên xwe ku ew koça xwe bar bikin.

### Xenîme û yexsîrên Huneynê

Pêxemberê Xwedê (s.) û hevalên xwe daketin Ce'ranê û çend şevan mohlet da Hewezaniyan heta ew bibin Misilman û werin balê. Piştre dest bi lavakirina mal kir û pêşî xenîme da yên baweriya wan qels.

### Vegerandina dîlan li Hewezaniyan

Desteyeke Hewezaniyan ku ji çardeh zilaman pêk hatibû, hatin cem pêxemberê Xwedê (s.) û jê daxwaz kirin ku mal û yexsîran bide wan. Vêca Pêxember (s.) ji wan re got:

– Yên ku hûn dibînin digel min in û gotina ku ez jê hez dikim ya herî rast e. Gelo hûn pir ji zarok û jinên xwe hez dikin, yan jî hûn ji malên xwe hez dikin?!

Gotinê:

– Em zarok û jinên xwe bi tiştekî naguhêzin.

Gote wan:

– Dema min nimêja sibehê kir, rabin werin û bibêjin: Em bi pêxemberê Xwedê (s.) mehdera xwe ji Misilmanan dixwazin û bi Misilmanan jî mehdera xwe ji pêxemberê Xwedê (s.) dixwazin ku êsîrên me li me vegerin.

Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) nimêja sibehê kir, ew rabûn û wisan gotinê. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) ji wan re got: "Herçî para min û ya mala Ebdulmuttelib e, ew dê ya we be û ez dê para xelkê jî ji we re bixwazim."

Vêca mihacir û Ensariyan got: Para me jî bila ji pêxemberê Xwedê (s.) re be. Lêbelê sê zilam ji mala Temîm, mala Fezare û mala Selîm ji para xwe ya xenîmeyê nehatin xwar.

Vêca pêxemberê Xwedê (s.) ji wan re got: "Ev xelkê han Misilman bûne, hatine nik me. Min destûr dabû wan û Min ew serbest hiştin, wan zarok û jinên xwe bi tiştekî veneguhastin, êdî herçî tiştek ji wan li cemê hebe û bi dilê we be ku wan vegerîne, ev rêya wê ye û kî bixwaze heqê xwe nede bila wan bide wan û jê re ji malê xenîmeyê ku Xwedê pêşîn dê li me vegerîne, bi her parekî şeş par heye."

Vêca xelkê got: "Em bi dilê xwe didin pêxemberê Xwedê (s.)." Vêca wî (s.) jî ji wan re got: "Em ji we yê ku qayil e û yê ku ne qayîl e ji hev nas nakin. Naxwe vegerin heta zanayên we rewşa we ji me re bînin." Vêca wan jin û zarokên wan li wan vegerandin û tu kesî ji wan xwe nedan paş. Pêxemberê Xwedê (s.) jî cilekî Qibtî li yeke Qibtî kir.

### Diltenikî û ciwanmêrî

Misilmanan di navbera yên ku bi xwe re birin bal pêxemberê Xwedê (s.) de Şeyma qîza Helîme ya Se'diye xweha pêxemberê Xwedê (s.) ya şîr jî hebû. Dema ew dibirin, ew nas nedikirin û ew êşandin. Vêca wê ji Misilmanan re got: Ez bi Xwedê kim, hûn dizanin ku ez xweha zilamê we ya şîr im. Lêbelê wan gotina wê rast nedêriya heta ew anîn cem pêxemberê Xwedê (s.).

Çi dema Şeyma giha nik pêxemberê Xwedê (s.) jê re got:

– Ya Resûlullah! Ez xuşka te ya şîr im.

– Nîşana vê çi ye?

– Nîşana vê gezeka te ye. Dema min tu danîbûyî ser piştа xwe te gez lê dabû.

Pêxemberê Xwedê (s.) ev nîşan nas kir. Jê re kurkê xwe raxist, ew li serê da rûniştandin û ew serbest hişt. Û jê re got:

– Eger tu hez bikî li nik min bi qedr û qîmet bimîne û eger tu bixwazî ez dê fersendê bidim te û tê li xelkê xwe vegerî.

Vêca wê jê re got:

– Na, fersendê bide min û min li xelkê min vegerîne.

Pêxemberê Xwedê (s.) fersend dayê, ew Misilman bû. Pêxemberê Xwedê (s.) sê kole, qerwaşek, deveh û pez danê.

### Bi dilên xwe ne, ne bêdilên xwe ne

Çi dema Misilmanan ji Taîfê koça xwe pêçan û berê xwe dane warê xwe, pêxemberê Xwedê (s.) got: "Bibêjin: Em li Xwedayê xwe vedigerin, tobekar in, ji Xwedayê xwe re îbadetkar in û hemdê wî dikin." Ji pêxemberê Xwedê (s.) re hate gotin: Ya

Resûlullah! Nifiran li Seqîfiyan bike. Wî got: "Xwedayê min! Seqîfiyan bîne ser rêya rast û wan bîne cem me."

'Urwe kurê Mesûdê Seqîfî da pey şopa pêxemberê Xwedê (s.) û beriya bigihîjê Medîneyê gihayê û Misilman bû. Ew vegeriya welatê xwe û xelkê xwe vexwende Îslamê. Ew li bal xelkê xwe mirovekî hejêkirî û mertebeya wî bilind bû. Çi dema ew vexwendin Îslamê û dînê xwe eşkere kir, wan tîr avêtê û ew şehîd kirin.

Seqîfiyan piştî şehadeta wî çend mehan wilo man. Piştre li hev civiyan û dîtin ku hêz û qeweta wan ji şerê Erebên derdora wan re nîne. Êdî wan peyman dane hev, Misilman bûn û desteyek şandin cem pêxemberê Xwedê (s.).

## Digel pûtperestiyê sistayî nîne

Seqîfî çûne cem pêxemberê Xwedê (s.) vêca wî ew li kêleka mizgeftê li ber holikekê hiştin. Ew Misilman bûn û ji pêxemberê Xwedê (s.) daxwaz kirin ku heta sê salan Lat neşikîne û ji wan re bihêle. Pêxemberê Xwedê (s.) daxwaza wan qebûl nekir. Wan jî her sal jê dixwestin û wî (s.) jî qebûl nedikir. Paşîkê jî dema ew çûne cemê û pê de; jê xwestin ku Lat mehekê ji wan re bihêle û neşikîne. Dîsa daxwaza wan redd kir -Ebûsufyan kurê Herb û Muxîre kurê Şu'be -yê ku ji qewmê wan bû- şande navbera wan da ku Lat bişkînin. Wan ji pêxemberê Xwedê (s.) xwest ku wan ji nimêjê muaf bigre. Vêca ji wan re got: "Dînê ku nimêj tê de nebe xêr tê de nîne."

Çi dema ew ji karên xwe vala bûn û berê xwe dane welatê xwe. Ebûsufyan kurê Herb û Muxîre kurê Şu'be bi wan re çûn. Muxîreyî Lat şikand. Îslam li navbera Seqîfiyan belav bû, heta xelkê Taîfê yên dawîn jî Misilman bûn.

## Xezweya Tebûkê

Ereban, şerê Romê û êrîşkirina wan xeyal jî nedikir û xwe ji vê yekê re piçûk ditîtin. Romê her û her Xezweya Mûteyê

dianîn bîra xwe ku wan ya di dilê xwe de neaniye cih û dilê xwe rehet nekiriye.

Pêxemberê Xwedê (s.) munasib dît ku hîn berî artêşên Romê bikevin tixûbên Ereban û ji navenda Îslamê re meydanê bixwînin, leşkerê Misilmanan biçe welatê Romê.

### Dema xezweyê

Pêxemberê Xwedê (s.) di meha Recebê sala nehemîn a hîcretê de di kelegermeke dijwar de, di demeke ku meywe û sih xweş bûn de, çû vê xezweyê. Wî (s.) berê xwe da rêwingiyeke dûr, çoleke bê av û neyarekî jimara xwe pir. Wî (s.) ji Misilmanan re rewş eşkere kir da ku xwe ji şerê xwe re kar bikin û ji wan re rexê ku dê pê ve biçe jî diyar kir. Ew demek welê bû ku xelk di tengiyê de bû û welat hişk bûbû.

Munafiqan gelek behane ji xwe re anîn. Wek nimûne; tirsa ji neyarê xurt, zordest û serdest û wek reva ji germa dijwar, wek bêdiliya di cîhadê de û wek guman û şeka di heqiyê de nexwestin bi pêxemberê Xwedê (s.) re derkevin.

Di bara vê yekê de Xwedê dibêje: *"Yên ji şer mayin bi rûniştina xwe ya (ji şerî) û bi mayîna xwe ya li pişt pêxemberê Xwedê kêfxweş bûn û wan nexwest bi mal û canên xwe di rêya Xwedê de cîhadê bikin û gotin: Di germê de neçin cîhadê. Ji wan re bibêje: Agirê dojehê germtir e, heke ew têbigihin."* (Tewbe: 81)

### Sehabî di cîhad û çûna sefera wê de bi hev re pêşbaziyê dikin

Pêxemberê Xwedê (s.) xwe da rêwîtiya xwe, ferman da xelkê ku xwe kar bikin, nav li dewlemendan da ku di rêya Xwedê de mal xerc bikin. Zilamin dewlemend çendîn ji wan Misilmanên ku mesref û heywana wan ya ku pê herin tunebû debirandin û xêra xwe li cem Xwedê hesab kirin. Usman kurê 'Effan leşkerê destteng debirand, hezar dînar xerc kir û pêxemberê Xwedê jî (s.) jê re dua kir.

## Meşa leşker ya bi Tebûkê ve

Pêxemberê Xwedê (s.) bi sî hezar leşkerî re ji Medîneyê derket û çû Tebûkê. Ev artêşa herî mezin bû ku pê çûbû şer.

Ew (s.) li Hecerê welatê Semûd peya bû, ji wan re ragihand ku ew der welatê cezaxweran e û got: "Hûn neçin welatê yên ku li xwe zulim kirine, ji bilî ku hûn ji tirsa ku ya hatî wan were serê we jî."

Li xelkê roj hilat û av bi wan re nebû, vêca giliyê bêaviyê li cem pêxemberê Xwedê (s.) kirin. Wî (s.) jî dua kir. Vêca Xwedê bi ser wan de ewrek hinart û baran hat heyanî têra wan barî û wan ji avê pêdiviya xwe pêk anîn.

## Vegerîna Pêxember ya Medîneyê

Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) giha Tebûkê, hin giregirên Ereban yên ku li tixûban diman hatin balê, pê re li hev hatin û cirm danê. Pêxemberê Xwedê (s.) ji hinekan ji wan re nameya asayîşê dan nivîsîn û tê de kefîltiya tixûb, temînkirina av û rê xerantîkirina selametiya herdu rexan li ser wan kire şert.

Li virê, rewş giha sînorê ku Rom vekişiya û ji fikra êrîş û xwe avêtina tixûban vegeriyan. Êdî pêxemberê Xwedê (s.) îhtiyac nedît ku li hundirê welatê wan bikeve pey wan. Ji xwe armanca wî (s.) hatibû cih.

Pêxemberê Xwedê (s.) deh û çend şevan li Tebûkê ma. Piştre vegeriya û berê xwe da Medîneyê.

## Îmtihan û serkeftina Ke'b kurê Malik

Ke'b kurê Malik, Merare kurê Reb'î û Hilal kurê Umeyye ji Misilmanên pêşîn bûn û di Îslamê de îmtihana wan rind bû. Merare kurê Rebî' û Hilal kurê Umeyye beşdarî şerê bedrê jî bûbûn û mayîna ji şeran ne adet û exlaqê wan bû. Ew ji vê xezweyê man. Ev jî, ji ber hîkmeteke îlahî helandin û safîkirina nefsa wan û tore û perwerdekirina Misilmanan bû. Ev jî, ji bo

ez dê sibê xwe amade bikim, ji ber vîna qels û ji ber pişta xwe sipartina navgînên şer yên heyî, pêk hat.

Pêxemberê Xwedê (s.) axaftina bi wan re qedexe kir. Misilmanan jî bi ya wî kir û guhê xwe danê. Vêca xelkê xwe ji wan dûr girt û ew li ser vî halî tam pêncî şevî man. Ke'b kurê Malik ji mala xwe derdiket, digel Misilmanan beşdarî nimêjê dibû, li sûk û çarçiyan digeriya û tu kes pê re nedipeyivî. Vê lewmê kokberdana wî ya di hezkirinê de zêde dikir.

Rewş li vê tenê jî nesekinî û giha pîrekên wan jî, fermana wan jî hate kirin ku xwe ji mêrên xwe dûr bigrin û wan jî wisan kir.

Di vê rewşê de, Melikê Xessanê Ke'b kurê Malik vexwende paytexta xwe da ku qedrê wî bigre, qenciyê lê bike. Bi vê armancê qasidê wî hate cem Ke'b û nameya Melik dayê. Ke'b jî rahiştiyê û avête tenûrê.

Çi dema tişta ku Xwedê xwestî; sadekirina van sê Misilmanan pêk hat û dinya li wan teng bû û erd digel firehiya xwe jî li wan teng bû, fereca xêrê ji wan re şand û qebûlkirina poşmaniya wan ji ser heft asîmanan şand. Vêca Xwedê got:

*"Bêguman Xwedê tobeya Pêxember, Mihacir û Ensariyan: ewên ku di dema tengiyê de dane pey, piştî ku nêzîk bû dilên komekê ji wan were der qebûl kir, piştre poşmaniya wan pejirand, lewra ew ji wan re diltenik û dilovîn e. Li wan her sisêyên ku ji (cîhadê) mabûn, heta erd digel firehiya xwe jî li wan teng bû û wan zanîn ku stargeh ji Xwedê ve be nîne. Piştre li wan tobeya wan pejirand da ku poşman bibin. Bêguman Xwedê her ew e tobepejrên û dilovîn."* (Tewbe: 117-118)

## Xezweya Tebûkê, cenga dawîn e

Bi şerê Tebûkê re dawî li xezweyên ku Pêxemberî (s.) ew kirin hat; ewên ku hijmara wan gihabû bîst û heft xezweyan û dawî li şande û cerdan jî hat ku jimara wan gihabû şêstî. Di hemûyan de şer pêk nehat û di wan de jimara kuştiyên her du rexan ji 1018 kesan nebihurî. Ew bû rawestina rêhtina xwînekê

-ku ji bilî Xwedê kesek hijmara wan nizane- bi navgîna asayîşa ku li hawîrdora giravê Erebistanê pêkhatî. Asayîş ewqas berqerar bû heta ku jinê jî dikariya ji Hîreyê were Kabeyê tewaf bike û ji bilî Xwedê ji tu kesî din netirse.

**Heca yekemîn di Îslamê de**
**û daketina (sûreyê) Beraet**

Hec, di sala nehemîn a hîcretê de ferz bû. Pêxemberê Xwedê (s.) di vê salê de Ebûbekir (r.) wek emîrê hecê şand da ku heca Misilmanan bide kirin. Ebûbekir digel sê sed zilamên ku xwestin biçin hecê ji Medîneyê derket.

Pêxemberê Xwedê (s.) bang kir Elî kurê Ebûtalib û jê re got: "Derkeve, here roja qurbanê li nava xelkê bang hildêre ku yê kafir naçe cennetê, piştî îsal yê pûtperest dê neyê hecê û yê tazî dê Kabeyê tewaf neke."

**Sala heyetan heyet peyapey hatin Medîneyê**

Piştî Xwedê Mekke vekir û Pêxemberê wî ji Tebûkê bi serfirazî û sip û saxlem vegeriya, heyet, nof bi nof hatin navenda Misilmanetiyê. Ew bi dilgermiya doza Îslamê û bi kîndariya li biwara pûrperestî û bandorên wê û cahiliyyet û dirûşmên wê vedigeriyan welatê xwe.

Demam kurê Sulebe ji ber mala Se'd kurê Bekir ve hate cem Pêxember (s.) û wek dozdar vegeriya cem gelê xwe û gotina ku pêşîn ji devê wî hate der ev bû; çi pîs e Lat û Uzza! Jê re gotin: Dev jê berde ey Demam! Xwe ji gewrîtiyê biparêze û xwe ji dînîtiyê biparêze. Ji wan re got: Wey li we be! Ew herdu ne zirarê didin, ne jî kar. Xwedê pêxemberek hinart, kitêbek jê re şand ku we, ji ya ku hûn tê de ne, paqij kir, ez şehde didim ku ji bilî Xwedê tu îlah tune ne. Ew yek e, bêşirîk e. Ez şehdê didim ku Mûhemmed jî bende û qasidê wî ye. Ez ji cem wî hatime bal we ji bo tişta ku wî emrê we pê kiriye û tişta ku li we qedexe kiriye ji we re bidim zanîn. Wê rojê hê nebûyî êvar ji êla wî tu zilam û jineke ku nebûyî Misilman neman.

Edî kurê Hatem ew ciwanmêrê bi nav û deng hat cem pêxemberê Xwedê (s.) Piştî dilnizmî û exlaqê wî dît Misilman bû. Paşîkê got: Ez bi Xwedê kim, ev ne toreya qralan e!

Pêxemberê Xwedê (s.) Mu'az kurê Cebel û Ebû Mûsa (r.) ji bo doza Îslamê bikin, şandin Yemenê, qewîtî li wan kir û ji wan re got: "Hêsan bikin û zor nekin, mizgînê bidin û wan nedin revandin."

Pêxemberê Xwedê (s.) Muxîre kurê Şu'be şand Taîfê. Wî Lat şikand, piştre hilgeriya ser sûra wê ya bilind û zilam jî pê re hilgeriyan, her wan kevir bi kevir hilweşandin heta anîn sewiyeya erdê. Ew heyet di heman roja xwe de hat cem pêxemberê Xwedê (s.) û hemd ji Xwedayê xwe re kir.

Hey'etan xwe hînî Îslamê dikir, di dîn de dibûn zana, exlaqê pêxemberê Xwedê (s.) û hevaltiya wî ya bi hevalên wî re didîtin. Ji wan re li hewşa mizgeftê çadir didanîn, li Qur'anê guhdarî dikirin, nimêja Misilmanan didîtin û tişta ku di dilê wan de diçû û dihat bi eşkere û rehetî ji pêxemberê Xwedê (s.) dipirsîn. Wî jî bi hostayî û bi tîn bersiva wan dida. Ji wan re delîla xwe ji Qur'anê dianî. Vêca wan jî îman pê dianî û dilê wan aram û rehet dibû.

**Zekat û sedeqe ferz bû**

Zekat, di sala nehemîn a hîcretê de ferz bû.

**Heca xatirxwestinê**

Çi dema daxwaza Xwedê hate cih; mala wî ji gemar û pûtan pak bû, êdî dilê Misilmanan bijiya hecê. Lewra ew ji mêj de jê dûr mabûn û kaseya hezkirin û bêrîkirinê tije û serve çûbû û dema firaqê jî nêz bûbû. Ji xwe pêdivî bi xatirxwestina ummetê jî çêbûbû. Xwedê destûra hecê da Pêxemberê xwe. Pêxember (s.) di serdema Îslamê de hîç neçûbû hecê.

Pêxember (s.) ji Medîneyê derhat da ku biçe heca Kabeyê, çav bi Misilmanan bikeve, îbadet û dînê wan nîşanî wan bide, şahidiya xwe ji stûyê xwe bike, spareyê xwe ragihîne, qewîtiya dawîn li Misilmanan bike, peyman û ehdê ji Misilmanan bigre,

berhem û eserên cahiliyyetê jêbibe, binax bike û wan têxe bin lingên xwe. Pê re zêdeyî sed hezar mirovî heca xwe kiri û navê vê hecê; "Heca xatixwestinê" û "Heca ragihandinê" danîn.

### Pêxember çawa hec kir?

Pêxemberê Xwedê (s.) haziriya hecê kir û bi xelkê da zanîn ku ew qesda hecê dike. Vêca wan jî kara xwe kir da ku pê re derkevin.

Xelkê derdora Medîneyê ev yek bihîstin û ew jî çûnê da ku bi pêxemberê Xwedê (s.) re biçin hecê. Di rê de jî xelkne ku nayên hijmartin gihanê; li pêşiya Wî, li dûv Wî, li rast û li çepê wî heta ku çavan didît, dimeşiyan. Pêxember (s.) di piştî nîvro de bi roj hê pênc rojê Zulqadê mabûn, di roja şemiyê de piştî nimêja nîvro çar rekat kir û beriya vê xutbeyek ji xelkê re xwend. Tê de ew hînî îhram, wacib û sunnetên hecê kirin.

Pêxember (s.) meşiya, "Lebbeyke" dixwend û digot: "Xwedayê min! Li ber emrê te me, ferman ya te ye, ferman bike, tu hevpişkê te tune, kerem bike, hemd nîmet û desthilatiya te ye, tu hevparê te tune." Ew di çarê Zulhîcceyê de çû Mekkeyê, çû Mizgefta Heramê, Beyt tewaf kir û li navbera Sefa û Merweyê geriya, çar rojan li Mekkeyê ma. Piştre roja terwiyeyê/roja av-vexwerinê (roja heştemîn a meha Zulhîcceyê) digel Misilmanan berê xwe da Mînayê, li wê peya bû, nimêja nîvro û berêvarê li wir kir û bi şevê jî li wir ma.

Çi dema roja nehê Zulhicceyê hilat, ji Mînayê meşiya, çû Erefê, ew roja înê bû û li wir peya bû.

Pêxember (s.) roja Erefê li ser deveya xwe ji xelkê re xutbeyek xwend, tê de bingehên Îslamê tayîn kirin û tê de bingehên pûtperestî û cahiliyyetê hilweşandin, tê de heramên ku hemû dînan di heremiya wan de tifaq kirine ku xwîn, mal û namûs in teyîn kirin, tê de fermanên Taristaniyê danîn bin lingên xwe , tê de ribaya cahiliyyetê giş danî bin lingan û pûç kir, qewîtiya jinan li wan kir. Ji wan re mafên jinan li ser mêran û mafên mêran li ser jinan ragihandin û da zanîn ku ya pêwist ev e; divê mêr qût û cilên wan bi rindî bidin wan .

Tê de qewîtî li ummetê kir ku xwe bi Kitêba Xwedê bigirin û ji wan re ragihand ku hetanî ew xwe pê ve bigrin ewên rêşaş nebin û piştre ji wan re ragihand ku ew jê berpirs in.

Ji wan xwest ku ew bipeyivin ka dê çi bibêjin û dê şahidiya çi bikin? Jê re gotin: Em şehdê didin ku te ragihand, te ji stûyê xwe kir û te nesîhet kir. Vêca Pêxember (s.) destê xwe rakir ber bi asîmanan ve û sê caran Xwedê li ser wan kir şahid û ferman da wan ku yên hazir ji yên ne hazir re ragihînin.

Çi dema xutbe qedand, emrê Bilal kir, wî jî bang da, piştre qameta nimêjê kir, nimêja nîvro du rekat kirin, piştre rabû nimêja berêvarê (esrê) jî du rekat kirin. Çi dema ji nimêja xwe vala bû, siwar bû, heta giha rawestîngehê (cihê wiqûfa Erefeyê) lê sekinî. Ew li ser deveya xwe bû, heta roj çû ava dest bi dua, zarzar û lavlavê kir. Di duayên de mîna xwarin xwestina yê reben destê xwe rakir dehma sînga xwe û tê de digot: “Xwedayê min! Tu peyiva min dibihîzî, tu cihê min dibînî, tu raz û eşkereya min dizanî, tu karekê min ji te ve ne winda ye, ez xizan û reben im, arîkarxwaz û li ber penaha te me, bi tirs û saw im, bi ber gunehên xwe ve têm, pirseke mîna pirsa hejaran ji te dikim, ez li ber te mîna gunehkarê reben zarzar û lavlavê dikim. Ez mîna sawgirê şeht li ber te digerim, mîna yê ku sitûyê wî li ber te xwar bûye, çavê wî li ber te hêsir barandiye, cesedê wî reben bûye û pozê wî hatiye firikandin. Xwedayê min! Tu min bi bangkirina xwe neke neqenc, li min bibe diltenik û dilovîn, hey çêtirînê jêxwazan! Hey çêtirînê dayendeyan!”

Li vir ayeta: *“Îro min dînê we ji we re kamil kir, min dana xwe li we temam kir û ez ji we re wek dîn bi Îslamê qayil bûme.”* (Maîde: 3) jê re hate xwarê.

Çi dema roj çû ava, ew (s.) bi lez ji Erefê daket, heta hate Muzdelîfeyê, li wir jî nimêja êvar û eşayê kir. Piştre raket heta bû sibeh. Çi dema sipêdeyê hilat di gava pêşîn de nimêja sipêdeyê kir. Piştre li deveha xwe siwar bû, hetanî hate Meşîrul Heramê (cihek li Muzdelîfeyê ye), berê xwe da qibleyê û dest bi dua, zarzar, tekbîr û laîlaheîllellah kir. Piştre berî roj hilê ji

Muzdelîfeyê derhat û bi lez meşî heta hat Mînayê; hat cemreya Eqebeyê û kevir avêtinê.

Piştre ew (s.) vegeriya Minayê li wê xutbeyeke bi tîn ji xelkê re xwend. Tê de hurmeta roja cejna Qurbanê, pîrozî û fezîleta wê li cem Xwedê û pîroziya wê ya di ser hemû welatan re li wan 'elimand. Emir kir ku ew bi ya wî kesê û li gorî kitêba Xwedê bibe mezinê wan û hukum bide guhdarî bikin. Ferman da ku xelk, îbadeta xwe ji wî (s.) bigrin û pişî wî ji dînê xwe venegerin û kafir nebin ku hin ji wan li stûyê hinan bidin. Ferman da ku ji wî -ji nehaziran re- ragihînin û di vê xutbeyê de got: "Îbadetê Xwedayê xwe bikin, pênc nimêjên xwe bikin, meha xwe ya rojiyê bigirin, bi ya mezinê xwe bikin, hûn dê biçin bihişta Xwedayê xwe." Wê gavê ji xelkê xatir xwest. Vêca jê re gotin: "Heca xatirxwestinê."

Piştre wî (s.) berê xwe da qurbangehê ya li Mînayê, bi destên xwe şêst û sê qurban gurandin. Ev jimara qurbanên ku ew gurandin; jimara salên temenê wî (s.) bû. Piştre sekinî û emir da Elî ku ji jimara sedî qurbanên mayî bigurîne. Çi dema gurandina qurbanan pêk anî, meqes xwest, pê serê xwe qusand û mûyên xwe li yên pişt xwe belav kir. Piştre bi siwarî meşiya û li Mekkeyê peya bû, wekî tewafa serdanê tewaf kir. Piştre hate zemzemê jipiya av vexwar, piştre eynî wê rojê vegeriya Mînayê lê raket. Çi dema roj hilat ma li hêviya nîvroyê, dema bû nîvro, ji cihê xwe meşiya heta hate cemreyê. Dest bi cemraya yekem kir, piştre ya navê, piştre jî ya sisêyê ku ew cemreya Eqebeyê ye.

Ew (s.) li wirê ma hetanî her sê rojên teşrîqê qediyan. Piştre rabû hate Mekkeyê, bi şevê tewafa sibehê kir, emrê koçê da xelkê xwe û berê xwe da Medîneyê.

Çi dema ew (s.) hate Zulhuleyfeyê lê raza, dema wî Medîne dît, sê caran tekbîr da û got: "Ji bilî Xwedê tu îlah tune, ew yek e, bêşerîk e, desthilatiya wî ye, hemd layiqî wî ye, ew li ser her tiştî kare ye. Emê li Xwedayê xwe vegerin. Em tobekar, îbadetkar, secdebir û ji Xwedayê xwe re senaxwên in. Xwedê peymana xwe anî cih, alî bendeyê xwe kir û wî bi tenê hevalbend bezandin." Piştre bi roj kete Medîneyê.

### Erka ragihandin û hiqûqê kamil bû, dema çavpêketinê nêz bû

Çi dema ev dîn giha zîrweya kemalê û ev ayet hate xwarê *"Îro Min ji we re dînê we kamîl kir, Min dana xwe li ser we timam kir û wek dîn ji we re bi îslamê qayîl bûm."* (Maîde: 3) Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) peyam ragihand, emanet ji sitûyê xwe kir, di rêya Xwedê de bi heqî cîhad kir û Xwedê bi hatina xelkê birr bi birr ya vî dînî çavê pêxemberê xwe ronahî û têr kir, êdî Xwedê destûra fîraqa ji vê dinyayê da pêxemberê *xwe û civanê çavpêketinê nêzîk bû, ev jê re da zanîn û gotiyê: "Dema arîkariya Xwedê û feth hat û te dît ku waye xelk birr bi birr ketin dînê Xwedê, hemdê Xwedayê xwe bike, wî pak bidêre û lêborîna xwe jê bixwaze, lewra ew tobepejrên e."* (Nesr: 1-3)

### Nexweşiya Pêxember

Nexweşiya pêxemberê Xwedê (s.) di dawiya meha Seferê de dest pê kir. Destpêka vê jî ev bû ku Pêxember (s.) di nîvê şevê de derket mezarê "Beqî'ul- Xerqed" lêborîna gunehên wan ji Xwedê xwest. Piştre vegeriya bal malbata xwe. Çi dema lê bû sibeh ji vê rojê ve nexweşiya wî dest pê kir.

Dayika mûminan Aîşe (r.) got: Pêxemberê Xwedê (s.) ji Beqî'ê vegeriya, ez dîtim ku wa ye serê min diêşe û ez dibêjim: Wa serê mino! Vêca ji min re got: Na, ez bi Xwedê kim, ya Aîşe, ne yê te, lê wa serê mino! Nexweşiya wî dijwar bû. Ew (s.) li mala Meymûne dima. Vêca gazî pîrekên xwe kir, ji wan destûr xwest ku di nexweşiya xwe de li mala Aîşeyê bimîne.

Wan jî destûr dayê û di navbera du mêran ji xelkên xwe de ku yek ji wan Fedil kurê Ebbas bû û yê dî jî Elî kurê Ebûtalib bû derket, dimeşiya, serê xwe girêdabû, bi lingên xwe hat heta kete mala Aîşeyê.

Aîşe (r.) dibêje: Wî di wê nexweşiya xwe ya ku tê de wefat kir de digot: "Hey Aîşe! Hêjî ez jana wê xwarina ku min li Xeyberê xwar dikêşim. Ev ew dem e ku ez -ji ber wê jehrê- dibînim ku waye rayê dilê min qetiyaye."

### Şandeyên dawîn

Pêxemberê Xwedê (s.) Ûsame kurê Zeydê kurê Harîse şand Şamê û ferman dayê ku bi hevalên siwariyên xwe re derbasî tixûbê Belqa û Darûnê yên welatê Filistînê bibe.

Gelek ji mezinên mihacir û Ensariyan di nav leşkerê wî de şand ku ji wan yê herî mezin Umer kurê Xettab bû. Pêxemberê Xwedê (s.) ew şand û nexweşiya Pêxember (s.) dijwar bû. Leşkerê Ûsame li Cerefê li çadirê xwe ma. Ebûbekir piştî wefata Pêxember (s.) leşkerê Ûsame Şand armanca wî da ku daxwaza Pêxember (s.) were cih û miradê wî kamil bibe.

Pêxember (s.) di sekerata xwe de qewîtî li Misilmanan kir ku ew heyetan bişînin û erkên xwe bînin cih. Eynî mîna ku wî (s.) di heyata xwe de ew kar dikirin û pêk dianîn wilo berdewam bikin û dîsa wesiyet li wan kir ku ew li girava Erebistanê du dînan bi hev re nehêlin. Ji wan re got: "Pûtperestan jê derînin."

### Dua ji Misilmanan re û hişyarkirina wan ji pozbilindî û quretiyê

Di rojeke ji rojên nexweşiya Pêxemberî (s.) de. Çend kes ji Misilmanan li mala Aîşeyê li cemê kom bûn. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) merhaba da wan, silav li wan kir û ji bo hîdayet, serkeftin û piştgiriyê ji wan re dua kir. Ji wan re got: "Ez qewîtiya tirsa ji Xwedê li we dikim. Ez qewîtiya Xwedê li we dikim. Ez wî

li ser we dikim wekîlê xwe. Ez ji aliyê wî ve ji bo we hişyarkerekî eşkere me ku hûn xwe li ser bende û welatên wî re mezin nedêrin. Bêguman Xwedê ji min û we re gotiye: "*Em vê mala axretê didin yên ku li erdê mezindêrî û tevdanê naxwazin. Encam ya xweparêzan e.*" (Qeses: 83) Dîsa gotiye: "Ma li cehennemê, ji xwemezindêran re cih nîne?!" (Zumer: 60)

**Nevîna cîhanê û heznekirina malê zêde**

Aîşe gotiye: Pêxemberê Xwedê (s.) di wê nesaxiya xwe ya ku tê de wefat kir de ji min re got: "Hey Aîşe! Çi ji zêr bû?" Jê re pênc, heft, heşt, an jî neh zêr anîn û li berê danîn, bi destê xwe ew li hev diqulibandin û digot: "Qey gumana Mûhemmed di bara Xwedayê zorbir û mezin de çi ye? Heger çav pê ketibûna û ew jî li cemê bûna, de here wan bide (jaran)"

**Girîngdîtina nimêjê û îmamtiya Ebûbekir**

Nexweşiya pêxemberê Xwedê (s.) lê giran bû, vêca got: "Gelo xelkê nimêj kir? Me jê re got: Na, ya Resûlullah! Ew li benda te ne. Got: "Ji min re avê bixin teştê." Wan jî wilo kir. Vêca wî (s.) xwe şûşt, piştre çû da ku bike, ji xwe çû, piştre hişê wî hat serê wî. Vêca got: "Gelo xelkê nimêj kir? Gotinê: Na, ya Resûlullah! Ew li hêviya te ne. Got: "Ji min re avê bixin teştê." Wan jî welê kir, xwe şûşt, dûvre çû da ku bike, ji xwe çû, peyre hişê wî hate serê wî. Vêca got: "Gelo xelkê nimêj kir?" Gotinê: Na, ya Resûlullah! Ew çavnêriya te dikin. Got: "Ji min re avê bixin teştê." Wan jî wisan kir, xwe şûşt, dûvre çû da ku bike, ji xwe çû, piştre bi xwe ve hat û got: "Gelo xelkê nimêj kir?" Gotinê: Na, ya Resûlullah! Ew çavlirêya te ne. Xelk hemû li mizgeftê bûn ji bo nimêja eşayê çavnêriya pêxemberê Xwedê (s.) dikirin. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) xeber ji Ebûbekir re şand ku li pêşiya wan nimêj bike. Ebûbekir zilamekî diltenik bû, vêca got: Hey Umer! Tu li pêşiya xelkê nimêj bike. Wî jê re got: Tu ji min layîqtirê vê yî. Vêca Ebûbekir wan rojan li pêşiya wan nimêj kir.

Piştre êşa pêxemberê Xwedê (s.) hinekî sivik bû, di navbera du zilaman -yek ji wan Ebbas bû, yê din jî Elî kurê Ebûtalib bû derket da ku nimêja nîvro bike. Çi dema Ebûbekir ew dît, çû da ku xwe bi paş ve bide. Vêca jê re îşaret kir ku xwe nede paş û emir da herduyan ku wî li tenişta Ebûbekir bidine rûniştandin. Vêca pêxemberê Xwedê (s.) rûniştî nimêj dikir û Ebûbekir jî jipiya nimêj dikir.

### Xutbeya xatirxwestinê

Pêxemberê Xwedê (s.) li ser mînberê rûniştî bû, serê xwe girêdabû û ev got: "Bêguman Xwedê, bendeyek ji bendeyên xwe li navbera girtina cîhanê û girtina ya li cem xwe de serbest hişt. Wî jî ya ku li cem Xwedê ye bijart." Ebûbekir di maneya vê kelîmeyê giha û zaniya ku pêxemberê Xwedê (s.) xwe qesd dike. Vêca girî û jê re got: Em xwe û zarokên xwe gorî te dikin.

### Nêrîna paşîn li Misilmanan û wan ji bo nimêjê sef girtibûn

Ebûbekir li pêşiya Misilmanan nimêj kir. Paşîkê roja duşemê bû, wan sef girtibû, nimêja sibehê dikir, Pêxember (s.) perdeya odeyê rakir, Misilman li ber Xwedayê xwe sekinî bûn. Wî li wan dinêriya û dît ku çawa xerzê doz û cîhada wî fêkî girtiye.

Vêca Xwedê tenê pê dizane ka dilê wî çiqas tijî kêfxweşî bû û rûyê wî şewq da. Dema sehabiyên xwe wiha dîtin diberiqand. Wan jî digot:

"Pêxember (s.) perdeya odeya Aîşeyê rakir û jipiya li me dimeyzand, rûyê wî her wekî ku pereke mushefa bû. Piştre keniya. Me ji kêfa kir ku nimêja xwe xirab bikin. Ji me were ku Pêxember (s.) dê werê nimêjê. Ji me re îşaret da ku em nimêja xwe temam bikin û dîsa perde berda berê û wê rojê wefat kir."

### Tûjehîşyarî ji îbadetê goran û mizgeftkirina wan

Gotina dawîn ya pêxemberê Xwedê (s.) ev bû: "Xwedê li Cihû û Filehan dide, wan mezarên pêxemberên xwe kirin mizgeft, bila li Erebistanê du dîn bi hev re nemînin."

Aîşe û Îbnî Ebbas dibêjin: Çi dema pêxemberê Xwedê (s.) pir diêşiya dikir reşdesmala xwe ji ser rûyê xwe bavêje. Dema pir êşiya ew ji ser rûyê xwe rakir û wiha got: "Naleta Xwedê li Cihû û Filehan bibare, wan gorên pêxemberên xwe kirin mizgeft" Bi vî awayî gef li ya ku wan kiribû dixwar.

### Wesiyeta dawîn

Dema pêxemberê Xwedê (s.) dikir wefat bike, bi gelemperî wesiyeta "Nimêjê û ya ku milkê destê we ye" dikir. Ew wesiyet her dikir heta xirexir pêkat û zimanê wî negeriya.

Elî dibêje: Pêxemberê Xwedê (s.) qewîtiya nimêjê, zekatê û ya ku milkê destê we de (cariye) dikir.

Aîşe dibêje: Ez çûm wî "ji şeytanan" biparêzim, wî bi ber asîman ve çavê xwe rakir û got: "Li cihê bilind e, li cihê bilind e."

Ebdurrehman kurê Ebûbekir hat hundir û di destê wî de çiqilek xurmeyî hebû, lê nêrî ji min were ku pêdiviya wî pê heye. Aîşeyê got: Min rahiştiyê, hejand û dayê, kela wî pê germ bû, ew bû xweşiktirînê ya ku kala wî germ dibû. Piştre çû dayê û ji destê wî ket.

Aîşeyê got: Di navbera destên wî de kodikek çermî yan jî tasek hebû tê de av hebû, destê xwe dikir nav avê û pê rûyê xwe vedimaliya, piştre digot: "Laîlaheîllellah, ji mirinê re serxweşî heye." Piştre tiliya xwe ya çepê radikir û digot: "Li cihê bilind e, li cihê bilind e." her ew digot heta canê xwe teslîm kir û destê wî ket avê.

Aîşe got: "Serê pêxemberê Xwedê (s.) li ser ranê min bû, êşê pê girt, bîstikî ji xwe çû, piştre hişê wî hat serê wî, çavê xwe ber bi banê xênî ve rakir û gotina wî ya dawîn bû ev: "Xwedayê min! Ez cihê bilind dixwazim."

### Pêxemberê Xwedê çawa ji cîhanê veqetiya

Pêxemberê Xwedê (s.) ji cîhanê veqetiya û wî li girava Ereban tevî desthilatî dikir, qralên cîhanê jê saw digirtin, li ber mirina xwe, wî (s.) ji qantira xwe ya sipî, çeka xwe û erdeke ku ew kire sedeqe pê ve, li pey xwe ne dînarek hişt, ne dîrhemek, ne evdek, ne jî qerwaşek.

Pêxember (s.) heta wefat kir jî, ji ber sî çeng ceh ve kumzirxê wî li bal Cihûyekî gerew bû û tiştekî ku bidiyê û kumzirxê xwe jê bistîne jî nedît.

Pêxemberê Xwedê (s.) di vê nexweşiya xwe de çil kes azad kirin, li cem wî yan şeş, yan jî heft dînar hebûn. Emir li Aîşeyê kir ku wan bi sedeqeyî bide.

Diya bawermendan Aîşe dibêje: Pêxemberê Xwedê (s.) wefat kir û li mala min tiştekî ku xwediyê kezeba ter bixwe nebû, ji bilî qetek nanê cehî ku di refê min de bû, vêca min jê xwar hetanî zeman di ser re derbas bû, û ew jî xilas bû.

Pêxemberê Xwedê (s.) di şêşt û sê saliya xwe de piştî nîvro sala yanzdehê hîcretê, 12ê meha Rebîulewwelê, roja duşemê canê xwe teslîm kir. Roja jidayikbûna Pêxember (s.) çawa roja herî bextiyar bû ku roj lê hilatibû, eynî wisan roja wefata wî ji mirovatiyê û Misilmanan re roja herî reş, bêhedanî, bêhogirî, karesat û dijwar bû.

Enes û Ebû Se'îdê Xudrî -Xwedê ji her duyan razî be- dibêjin: Ew roja ku tê de pêxemberê Xwedê (s.) hat, her tişt jê rohnî bû. Ew roja tê de wefat kir jî her tişt jê tarî bû. Ummueymenê girî, jê re hate gotin: Çima tu li ser Pêxember digirî? Got: Min zanîbû ku pêxemberê Xwedê (s.) dê bimre, ez li ser wê wehya ku ji ser me hat birrîn digirîm.

### Sehabiyan xebera wefata Pêxember çawa pêşwazî kir?

Xebera wefata pêxemberê Xwedê (s.) mîna birûskê li ser Misilmanan ket. Ji ber ku wan pir jê hez dikir û ji ber ku jiya-

na wan di ber hîmayeya wî (de ji wan re bûbû adet. Eynî wekî jiyana zarokan ya di hîmaye û mala bavan de bû. Belkî ji vê jî hê bêhtir bû.

Xwedê di bara vê yekê de gotiye: *"Sond be, ji we bi xwe, ji we re pêxemberekî wilo hatiye ku zehmetkêşiya we li zora wî diçe. Lewra ew, ji dil û can dixwaze hûn bêne rêya rast û durist û ji bo bawermendan dilnerm û dilovîn e."* (Tewbe: 128)

Her yekî ji sehabiyan, ji xwe re hesab dikir ku ew ji hevalê xwe bêhtir jê hez dike û xatirê wî digire. Hinan ji wan ji xebera mirina wî bawer nekir, di pêşiya van de jî Umer kurê Xettab dihat. Wî di yê ku got: Pêxemberê Xwedê (s.) wefat kir de xeyidî, çû mizgeftê û xutbeyek ji xelkê re xwend û ji wan re got: Pêxemberê Xwedê (s.) namire, hetanî ku Xwedê munafiqan ji holê rake.

**Helwesta Ebûbekir ya vebirî**

Ebûbekir zilamê çaxê hewceyiyê û çiyayê asê bû; ewê ku naheje û naherife. Dema xebera wefeta Pêxemberî (s.) gihayê ji mala xwe derket û hat heta ber derê mizgeftê, Umer jî bi xelkê re dipeyivî, li tiştekî nezîvirî heyanî kete cem Pêxember (s.) ku li mala Aîşeyê bû û kurkê wî bi ser de bû, ew ji ser rûyê wî hilanî. Piştre berê xwe dayê û ew maç kir, dûvre got: Dêbavê min gorî te bin. Herçî ew mirina ku Xwedê li ser te daniye, va ye te ew tam kir. Piştre tu dê hîç nemirî û dîsa kurkê wî bi ser rûyê wî de kir.

Piştre derket û Umer hê jî bi xelkê re dipeyivî. Vêca gotê: Hey li cihê xwe bimîne û hiş be! Ew nesekinî. Dema Ebûbekir dît ku waye ew nasekine, berê xwe da xelkê. Çi dema xelkê dengê wî bihîst, berê xwe danê û Umer hiştin. Hemd ji Xwedê re kir û pesnê wî da û piştre got: Gelî mirovan! Herçî ku îbadeta Mûhemmed dikir, vaye Mûhemmed wefat kir. Herçî ku îbadeta Xwedê dikir. Xwedê namire. Piştre ev ayet xwend: *"Mûhemmed pêxemberek e û hew, beriya wî jî pêxember ha-*

*tine û çûne, qey ku ew bimre yan jî were kuştin hûn dê bi ser gûzekên xwe ve bizîvirin?! Kî bi ser gûzeka xwe ve bizîvire ew dê hîç bi tiştekî ziyanê nede Xwedê. Xwedê dê xelatê bide sipasdaran."* (Alî Îmran: 144)

Yê ku beşdarî vê civînê bûbûn dibêjin: Wellahî, her wekî ku xelkê nizanîbûn ev ayet hatiye xwarê. Hetanî wê rojê Ebûbekirî ew xwend.Vêca xelkê ew ji Ebû Bekrî girt û êdî ew kete devê wan.

Umer dibêje: Ez mam şaş û metel û ketim erdê, qidûmşikestî bûm û min zanî ku êdî pêxemberê Xwedê (s.) wefat kiriye.

## Peymana xîlafetê dane Ebûbekir

Misilmanan li civîngeha mala Sa'ede peymana xelîfetiyê dane Ebûbekir da ku Şeytan rêya xwe li cudakirina gotina Misilmanan û ji hevqetandina koma wan nebîne û hewes bi dilên wan neleyîzin û ji bo pêxemberê Xwedê (s.) ji vê dinyayê veqete û gotina Misilmanan jî yek be, civata wan bi rêkûpêk be û li ser wan fermandarek hebe ku ew kar û barên wan birêve bibe ku yek ji wan jî şûştin, kefenkirin, nimêjkirin û sipartina Pêxember bi axê bû.

## Misilmanan çawa xatir ji pêxemberê xwe xwest çawa li serê nimêj kir

Bêhna xelkê hate ber wan, ew sakin bûn, ew sergêjî û dermandeyiya ku tê de bûn ji wan re xuya bû û bi kirina wê tişta li biwara yê ku ji cîhanê veqete divê were kirin ya ku Pêxemberê wan li wan elimandibû, lebikîn.

Çi dema ji şûştin û kefenkirina wî vala bûn -ev erk malbata wî hilgirtibûn ser xwe- û textê wî danîn mala wî. Ebûbekir ji wan re ragihand ku wî bihîstiye ku pêxemberê Xwedê (s.) gotiye: "Kîjan pêxember, canê wî li ku hatibe stendin ew li wir hatiye binaxkirin." Vêca nivînê pêxemberê Xwedê (s.) ya ku li serê wefatkirî rakirin, binê kolan û ev erkê jî Ebûtelheyê ensarî hilgirt ser xwe.

Piştre Misilman ketin hundur û birr bi birr li serê nimêj kirin; zilam ketin hundir, dema ew ji nimêjê vala bûn vêca pîrek ketin hundir, dema ew jî vala bûn, vêca zarok ketin hundir û di nimêja cenazeyê pêxemberê Xwedê (s.) de tu kesî îmamtî nekir.

## Ev roja şêşemê bû

Ew li Medîneyê rojeke xemnak bû. Bilal banga fecrê da. Çi dema behsa Pêxember (s.) kir, giriya û giriya vêca jê derket û kula Misilmanan hê zêdetir kir. Ji xwe ji wan re bûbû adet ku li cem pêxemberê Xwedê (s.) vê bangê bibihîzin.

Dayîka bawermendan Ummuseleme dibêje: Haho, gidî ew çi musîbet bû! Piştî wê çi musîbet li me biqewime li ber wê kêm tê. Dema em musîbeta xwe ya (mirina) Pêxemberî (s.) bînin bîra xwe. Pêxemberî (s.) bi xwe gotiye: "Mirovno! Musîbetek were serê çu kesî (çu muminî) bila teziya wê bi musîbeta xwe ya bi Min bike ji ber musîbeta ku bi dîgerê Min hatiye serê wî. Lewra tu kes ji umeta min piştî musîbeta min yeke hê dijwartir dê neyê serê wî."

## Pîrekên wî dayikên mûminan in

Pîreka Pêxember (s.) ya yekemîn Xedîce keça Xuweyledê Qereşiyê Esedî ye. Pêxember (s.) berî pêxembertiyê ew ji xwe re anî, hingê ew çil salî bû. Wê sê sal berî hîcretê wefat kir. Ji bilî Îbrahîm zarokên Pêxember (s.) tev ji wê ne.

Pêxember (s.) piştî mirina wê bi çend rojan, bi Sewdet keça Zeme ya Qereşî re zewicî. Piştre bi Aîşeya Siddîqa keça Siddîq, fiqihzan û alima ji hemû jinên ummetê zanatir re zewicî.

Dûvre bi Hefseya keça Umerê kurê Xettab re zewicî. Piştre bi Zeynebe keça Xuzeyme re zevicî û pey du mehan li cem wî çû rehmetê. Piştre bi Ummuseleme Hind keça Ebûemeyye yê Qereşiyê Mexzumî re zewicî, ew ji aliyê mirinê ve jina wî ya dawîn e.

Piştre bi keça meta xwe Umeyme Zeyneb keça Ceşh re zevicî. Bi Cuweyriye keça Harise kurê Dirarê Musteliqiye re, piştre Umu Hebibe Remele keça Ebûsufyan re zewicî. Piştre bi Sefiye keça Hey kurê Exteb serekê Mala Nedir re zewicî. Piştre bi Meymûne keça Harisê Hilaliye re zevicî ku ew ya herî dawî ye ku ew bû pê re zevicî.

Pêxemberê Xwedê (s.) wefat kir û neh jin jê man. Ewên ku me li virê navê wan anî bi bîr. Ji bilî Xedîce û Zeynebe keça Xuzeyme. Lewra wan her duyan hê di heyata wî de wefat kiribûn. Du cariye jî jê man, yek Mariye keça Şem'ûnê Qibtî yê Misrî bû ku mezinê Misrê Mûqewqis ew ji Pêxemberê Xwedê (s.) re diyarî kir û ew bû dayika kurê wî Îbrahîm. Ya dî jî Reyhane bû ku keça Zeydê mala Nedîr e. Ew Misilman bû, vêca Pêxemberî (s.) ew azad kir û dûvre mehr kir.

## Zarokên wî

Xedîceyê, ji pêxemberê Xwedê (s.) re Qasim anî. Pêxember (s.) pê dihate bangkirin. Qasim hê bi zaroktî mir, piştre Zeyneb, Rûqiye, Ummukulsûm, Fatîme, Ebdullah, Tayyib û Tahir. Ev du leqebên wî ne. Ev hemû ji Xedîceyê bûne. Fatîme di dilê wî de ji hemû qîzên wî yên dîtir bêhtir şîrîn bû û wî ragihandiye ku ew xwenda jinên bihiştê ye. Ew bi Elî kurê Ebûtalib kurapê pêxemberê Xwedê (s.) re zewicî û jê re Hesen û Huseyin anîn ku pêxemberê Xwedê (s.) di bara wan de got: "Hesen û Huseyin xwendên xortên xelkê bihiştê ne."

Mariyeya Qibtî ji pêxemberê Xwedê (s.) re Îbrahîm anî, dergûş tije kir û mir. Dema wî wefat kir pêxemberê Xwedê (s.) got: "Hey Îbrahîm! Çav hêsir dike, dil xemgîn dibe, em ya ku Xwedê bixeyidîne nebêjin û em xemgîn in."

## Exlaq û wesfên wî

Elî kurê Ebûtalib Pêxember (s.) daye nasîn ku ew ji her kesî bêhtir wî dinase û pirtir pê re hevaltî kiriye -û ji her kesî bêtir dikare wî bide naskirin û ravekirin- û wî gotiye:

Ew ne miroveki ziman xerab û xuypîs bû, li sûkan nediqêriya, neqencî bi neqenciyê pêşwazî nedikir. Lêbelê lê dibuhurî û dihişt. Wî (s.) ji bilî ku di rêya Xwedê de cîhad kir, bi destê xwe hîç li tiştekî nedaye. Wî (s.) li çakerekî û li jinekê nedaye. Min hîç nedît ku wî heyfa neheqiyeke ku lê bûyî hilda, heta tiştek ji heramên ku Xwedê qedexekirî nehata binpêkirin. Lêbelê dema heramek ji heramên Xwedê hatiba binpêkirin ew (s.) ji her kesî bêhtir hêrs dibû. Ew kengî di navbera du karan de hatibe serbest hiştin, wî her ê hêsan bijartiye. Dema ew diçû mala xwe wekî mirovekî asayî bû: Cilên xwe dişûşt, pezê xwe didoht û kar û xizmeta xwe dikir.

Elî dibêje: Ew (s.) dema radibû û rûdinişt bi zikir bû, dema diçû nava civatekê ku der vala dîtiba lê rûdinişt û ev yek emr jî dikir. Qismetê her xelkê civata xwe didayê, rûniştiyê wî tu kesek ji xwe li cem wî bi qedirtir nedijimart. Kî li cemê rûniştibana yan jî di bara tiştekî de têkilî wî bibûna lê disekinî heta ew rabûbana çûbana. Kî tiştek jê xwestiba ew destevala venedigerand (heke ew tişt nebana) bi gotineke xweş ew vedigerand.

Exlaq û camêriya wî (s.) têrî her kesî dikir. Ew ji xelkê re bûbû bav û ew jî lê cemê di mafan de wekhev bûn. Civata wî (s.) civata ilm, heya, sebr û emanetê bû.

Ew (s.) ji aliyê merdîtî ve ji hemû mirovan sing-vekirîtir bû, ji aliyê peyv û ziman ve ji hemû însanan rasttir bû, ji aliyê berbihêrî û tebîet ve ji her kesî rûnermtir bû, ji aliyê qedirgirtina hevalên xwe ve ji her kesî bêhtir qedrê hevalên xwe digirt. Yê ku ji nişka ve ew dîtiba jê saw digirt, kê têkilî pê re kiribana û ew naskiribana jê hez dikir. Pesingoyê wî Elî pesnê wî (s.) dide û dibêje: Min ne berî wî, ne jî piştî wî yekî mîna wî nedît. Xwedê cila sipehîtiyê li pêxemberê xwe kiribû, hezkirin û jêsawgirtin avêtibû serê.

Ber'a kurê Azib salixên wî dide û dibêje: Pêxemberê Xwedê (s.) qameteke wî ya mûtedil hebû. Min ew (s.) di rengekî sor de dît û min hîç tiştekî ji wî spehîtir nedîtiye.

Ebûhureyre salixên wî daye û gotiye: Ew qametnavîn bû, nêzîktirê dirêjiyê bû, spîgewr bû, riya wî reş bû, dev û diranê wî lihevhatî bûn. Birû û mijangên wî dirêj bûn û navmilên wî fireh bûn (heyanî got:) Min ne berî wî, ne jî piştî wî kesekî mîna wî nedît.

Enes di bara wî de dibêje: Destê min negihaye dîbac û hevrîşmekî ji mista Pêxember (s.) nermtir û min hîç bêhneke ji bêhna pêxemberê Xwedê (s.) xweştir bêhn nekiriye.

**bêgane** biyanî, xerîb, nenas
**benî** kole, evd
**bûyer** qewimîn, waqie
**çê** qenc, baş
**cendek** cesed, cenaze, naaş
**dabaş** mijar, behs, qal
**daqurpandin** daqurtandin
**derfet** îmkan
**dilovan** dilnerm, bexşende
**dût** sewaxa heriyê
**ewledêrî** emînî,
**ewlehî** emniyet
**fêris** egît, qehreman
**fermanber** emirber, memûr, yê ferman lê tê kirin
**gernas** mêrxas
**girîng** muhîm
**govan** dîdevan, şahid
**hebandin** hezkirin, qebûlkirin, hewandin
**hemandin** parastin, hîmayekirin
**hevrîçêkirin** şirîk çêkirin
**hevrik** dijber, dijmin
**hewildan** cehd kirin
**hişkeber** kevirê hişk, berên hişk
**îtîkaf** îbadeteke ku di rojên dawî yên remezanê de ji dervayî kar û xebatên dinyayî tenê pê re tê lebikîn
**jînenîgarî** biyografî,
**karesat** musîbet, bobelat, felaket
**kinês** zurriyet
**lêvegeran** lêvegerîn, lê zîvirîn
**mehder** şefaet
**miqirsî** nîqaş, gelc
**mîratxwerî** xwediyê mîratê, warisî
**mişt** tijî, dagirtî
**nakokî** paradoks
**navgîn** amûr, wasite
**nepenî** veşartî, xef
**nirx** hêjayî, qîmet
**pêdivî** hewcehî
**pêhnpak** xwedan fezîlet
**pejirandin** qebûlkirin
**perwerdehî** talîm, terbiye
**pêşbazî** musabeqe,
**peyman** ehd, eqîd, muqawele
**peyxam** mesaj, hinare, rîsale
**pispor** zana, mutehessis
**qerf** henek, yarî
**qewîtî** şîret, nesîhet, tewsiye
**ragihandin** gihandin, rîwayet kirin
**rapêş** erzkirin, dan temaşekirin
**rapêş** pêşkêş, erzkirin
**rêzan** rêber, pêşkêş, pêşîvan
**rûdan** bûyin, çêbûn
**sipare** emanet
**sipêde** sibeh, şefeq
**sirûd** marş
**siruşt** tebîet
**sosret** balkêş, ecêb, heyret
**şande** kom, qefle
**şûngir** cihgir, welîehd
**taristanî** cihê tarîtiyê, warê reşahiyê
**têkçûn** binketin, şikestin xwarin, winda kirin
**tekûz** durist, rêkûpêk, bidûzen
**temen** umur
**vebirî** teqez, qet'î
**veguhastin** guherandin, neqil-kirin
**vexwendin** dawet kirin
**xezwe** şerê ku Pêxember bi xwe beşdar bûyiye
**xwend** xwedî, malik
**zadeganî** esilzadeyî, pîsmîrî
**zengû** rikêb

PEYXAMBERÊ UMMETÊ

# HEZRETÎ MUHEMMED

EBDULHADÎ BOTÎ



Di nav xebatên li ser tarîxa pêxemberan û resûlê me Hz. Mûhemmed de, xebatên Nedwî gelekî hêja ne û di nav Misilmanan de elaqedariyeke baş dibînin.

Serwextbûn û ehilbûna Nedwî, ji aliyê alimên Îslamê ve hetanî roja îro nebûye dabaşa munaqeşê, herkesî zanatî û pisporiya Nedwî qebûl kiriye... Hêvî ew e ku ev berhema hêja ya ku bi zimanekî rewan û sivik ji bo zarokên Misilmanan hatiye nivîsandin, ji bo zarokên Kurdan jî bibe wesîla fêhmkirina heyata Resûlullah û rastiya Îslamê...



